# Tefekkur Di Kaînat, Însan û Qur'anê De

Osman Nûrî TOPBAŞ


**Navê Resen:** Kainat, Kur'an ve İnsanda Tefekkür

**Nivîser:** Osman Nûrî Topbaş

**Wergêr:** Mehmet Seyhan

**Rastker:** Abdusselam Kartal

**Qordînator:** Muhammed Davuthan Kılıç

**Grafiker:** Mustafa Kayan

**ISBN:** 978-9944-83-804-7

**Navnîşan:** Ikitelli Organize San. Bölg. Mah. Atatürk Bulvarı, Haseyad 1. Kısım No: 60/3-C Başakşehir, Istanbul, Turkey

**Tel:** (+90-212) 671-0700 pbx

**Fax:** (+90-212) 671-0748

**E-mail:** info@islamicpublishing.org

**Malpera Webê:** www.islamicpublishing.org

**Sertifika çapê:** Weşanên Erqem

**Language:** Kurdish

WEŞANÊN ERQEM

# PÊŞGOTİN

*“Îbadetekî wekî tefekkurê nîn e”*

(Beyheqî, Şûeb, 4, 157)

Hemd û senayên bê tixûb û bê dawî ji Rebbê me re bin! Ewê ku xwediyê kerem û îhsanê ye; ewê ku qabilîyeta **“tefekkur”** û **“pêhis”**ê daye me û pê rêya naskirina xwe **“merîfetullah”** ji me re vekiriye.

Dirûd û silavên bêtixûb li ser pêğemberê Xuda bin! Ewê ku bi awayê ciwantirîn, hestyartirîn û kûrtirîn Qur’an xwendiye, di heqîqeta kaînat û însan gihaye û li ummeta xwe hîn kiriye ka ew dê çawa bi berî çavên serî xwe bibine, çavên dil van tiştan bixwîne û wan fehm bike!

Heq Teala ji navbera hemû mexlûqatên xwe bi awayekî tekûz qencîya xwe li însanan tenê -û bi awayekî piçek jî li cinan- kiriye; fehmkirina heqîqeta **Qur’an**, **însan** û **kaînatê** kiriye para wan. Hem jî ew şîyan û qudret daye wan ku durr û sedefên heqîqetê ji wan derînin û pê jîyana xwe rohnî bikin. Wî, **“Tefekkur”** û **“pêhis”** jî kiriye navgîna yekem ji bo tehqîqkirina vê armancê.

Di rastîyê de tefekkur û pêhis, ji bo gihiştina heqîqetê û bicihkirina heqîqeta jîyana qelbî şert û mercekî lazim û jêneger e.. Qur'ana pîroza ku rêzana bextîyarî û hîdayetê ye; ewa ku ti şibh û nezîrê wê nîn in, ew ji ayeta xwe ya pêşîn heta bi ayeta xwe ya dawîn bi her wesîle û navgînê me gazî tefekkurê dike û ji me re dibêje; divê hûn li ser hikmetên ku di xulqîyeta însan de hene û di riste û nîzama mûcîzewî ya di kaînatê de bifikrin. Divê hûn di ayetên Xuda Teala de, yanî di nexşên şîyan û qudreta wî ya mezin û desthilatîya wî ya mûtleq a ku di cîhanê de hene de, bifikrin.

Heq Teala di Qur'ana pîroz de bi her wesîle û navgînan bi mûmînan re dipeyve, wan şîyar dike û ji wan re wiha dibêje: **"Ma hûn nahizirin? Ma ew eqil nagirin? Ma ew tênagihin? Ma ew nabînin?"**[1]

Xuda Teala dîsa bala mûmînan dikişîne ser mexlûqatan û wiha dibêje: **"Ma ew li hêştiran nanêrin ka ew çawa hatine aferandin?"**[2]

---

1 Binêre; Beqere, 219, 266; Nîsa, 82; Enam, 50; Ehzab, 27; Yasîn, 68; Mûhemmed, 24.

2 Xuda Teala bi mûcibê navên xwe el-Barî û el-Mûsewwir, her mexlûqek ji mexlûqatên xwe bi şekl û awayên curecur amade kirine. Di her mexlûqekî xwe de jî ew şîyanên mûnasib û bikêrhatî ji bo şertên ku têde peyda dibin û erk û wezîfa ku ewê wê bicih bîne, xuliqandiye. Eşkeretirîn nimûna vê xusûsê jî ew şîyan û taybetmendîyên ku dane hêştiran. Wî jê re cihek çêkiriye ku ew têra heftyekê têde ji xwe re avê hilîne. Lewra ew di hewayeke çolîya bêşînahî û bê av de dijî. Ew cih jî milikê hêştirê ye. Hêştir, xureka wê ji giyayan e, heta ji strîyan e, ew pê dikare mideheke dirêj

Xuda Teala dîsa balê dikişîne ser siriştê û hikmetên ku têde hene, wiha dibêje: **“Ma ew li asîmanî nanêrin, di ser wan re ye, me ew çawa ava kiriye, me ew bi xişr kiriye û jê re qelş jî nîn in?”**[3]

Xuda Teala dibêje: **“Bibêje; binêrin ka çi li asîmanan û erdê hene? Lê nîşan û hişyarî feyde nadin qewmekî ku bawer nakin!”**[4]

Xuda Teala bala mirovan dikişîne ser tarîxê û dibêje: **“Ma ew li erdê negerîyane ku binêrin ka encama qewmên berîya wan çawa bûye? Xuda ew birine helakê û ji kafiran re jî encameke wekî wê heye!”**[5]

Her wiha Heq Teala me evdên xwe bi her wesîle û navgînê gazî tefekkurê dike û ji me dixwaze em fitreta Xuda Teala fehm bikin, ewa ku pêkan e, em jê re ‘qanûnên îlahî yên ku di kaînatê de hukm dikin’ bibêjin û em şertên ku van qanûnan didin xuyakirin jî fehm bikin.

Dîsa Xudayê me, ji însan dixwaze ku ew li vê kaînatê seyr û temaşe bike; lê ne bi nêrîneke vala,

wê xureka xwe taze biparêze. Ew bi awayekî wisan bikêrhatî hatiye aferandin ku karibe xwe li hemberî bahozên sêlihî yên çolî û germahîya dijwar a di wê hewaya çolî de biparêze. Bêguman ev nimûneyeke tenê ye ji navbera hezaran nimûneyên ku zanîn, şîyan û hunerê îlahî nîşan dide. [Ğaşîye, 17]

3 Qaf, 50/6.

4 Li sûretên Ğaşîye, 17-20; Nûr, 43; Re‘d, 3; Nehl, 65; Rûm, 50; Enbîya, 31, binêre! [Yûnus, 10/101].

5 Mûhemmed, 47/10.

netêgiha û nefehm; belku bi çavekî bîner, zana û têgiha.

Ji lewma Heq Teala piştî ku di Qur'ana pîroz de nîmetên îlahî di bîra mirovan tîne, ew wiha bi me re diaxive û dibêje: **"Bêguman di vê de îbreteke heye ji bo xwedîyê dîtinê!"**[6]

Dîsa Heq Teala dibêje: **"Gelî xwediyên dîtinê, îbret bigrin!"**[7]

Xudayê bilind û mezin bi israr ji me dixwaze ku em hem xwe, hem jî tebîetê bifikrin. Ji lewma Xuda Teala di Qur'ana pîroz de di sed û pêncî cihan de ferman li me dike, ji me re dibêje; di tecellîyat û eserên mezinatî û şîyana îlahî de bifikrin.

Ji bo bicihkirina vê rastîyê jî ew têgihayên wekî "teeqqul, tedebbur, tezekkur û tefekkur" bikartîne. Bêguman Tesewwuf ji bo terbîye û perwerda manewî çêtirîn metod û rêbaz e ku di asta bilindtirîn de van mefhûm û têgihayan di jîyanê de tetbîq dike.

Tesewwuf îstîdad û amadekarî ya manewî ya ferd û takekes e. Zêdetirî vê jî, ew dan û lutfa Xuda Teala ye û ew nav e, ji bo rêya gihan û tekamulê ku gihiştina zirwa heqîqetan ji xwe re dike armanc. Ji ber vê, hikmeta ku dibêje; **"Kî xwe nas kiribe, bêguman**

6 Al-i Îmran, 3/13.
7 Heşr, 2.

**wî Xudayê xwe jî nas kiriye”** di rêya tekamul û gihana menewî de prensîb û esasekî giringtirîn ji hîm û seretayên ehlê tesewwufê pêktîne.

Di kaînatê de her zerreyek ji însanê xwediyê dilê zindî re aferînerê wî di bîra wî tîne, qudret û şîyana aferînerê hotsa di bîra wî tîne. Di kaînatê de her tişt, ji alema mîkro heta bi alema makro ji mezinatîya îlahî re şehde dide.

Ji bo hemû mexlûqatan awayekî xwebêjî û îfadê heye, jê re **“lîsanê hal”** dibêjin, her tişt pê heqîqetê xweş û eşkeretir îfade dike. Ji bo mûmîn karibin bi awayekî layiq di wan letîfe û beyankirinan bigihin, divê Heq Teala qibla dil be, wekî ku Ke‘be jî qibla bedenê ye.

Xuda Teala di ayetên Qur’ana pîroz de dibêje: **“Ewên ku şipya, rûniştî û li ser teniştên xwe zikrê Xuda dikin, di aferandina asîmanan û erdê de difikrin û dibêjin; Xudayê me! Te ev pûç neaferandiye, tu ji hemû kêmasîyan pak û dûr î, me ji ezabê êgir biparêze!”**[8]

Kîjan însan bixwaze bi awayekî layiq di tecellîyatên şîyan û mezinatiya îlahî yên ku di kaînatê de hene, bifikre, divê ew pêşî di bêkêrî û bêçaretîya xwe bigihe. Paşê ewê bi teslîmîyeteke tam û bi îtaet di her hilm û

8 Al-i Îmran, 3/191.

nefeseke ku distîne de tim aferîner û Xudayê xwe zikr bike. Her wiha dilê wî dê ji nûra teqwayê tije bibe. Ew bi tefekkur û teqwayê re jî digihîje rast û durustîya çêtirîn û meqbûltirîn.

Însan li cem Heq Teala, ne bi şeklê bejn û bala xwe, ne bi çehr û sîmayê xwe û ne jî bi derfet û îmkanên maddî yên xwe yên dinyayî; lêbelê ew bi kamilbûna xwe ya qelbî, bi kûrbûna manewîyata xwe û bi wesf û qabilîyetên rûhanî yên xwe qîmet û bihayekî îfade dike. Ji ber vê, Qur'ana pîroz bi kûrbûneke hesta îmanî tefekkura mûmînî xurt û destek dike û wê tefekkurê ji tixûbê maddîyatê û nefsanîyet û şehweta teng xilas dike; wê digihîne ufûq û asoyên rûhanîyeta fereh, dûv-dirêj û ebedî ya bêsînor. Tefekkura mûmînê ku karibe bi nêrîna îbretgirtin û tedebburê li vîtrîn û lewhên îlahî yên ku li kaînatê hene, seyr û temaşe bike, ew wesfekî rûhanî qezenc dike. Tefekkureke wiha bi pêhiseke qelbî, kûr û berfereh, ji bo îmanê kilîta sipehîtirîn e.

Lêbelê kîjan însan bunya rûhanîya xwe kamil neke, ew bi xuyahîyên jîyana nizm ve girêdahî dimîne û ew amadekarîya tefekkura xwe jî di dehlîzên hezkirinên berwext û berzewal de dibe helakê. Qelb û îdrakeke wiha tenbel, di şûna ku berê xwe bide ser heq û xêrê, ew tim berê xwe dide ser vîtrînên fanî û mirok. Ew jî wî li hemberî hewes û arzûyên nefsê qels dike. Ew hîç nahizire ku **KEFEN**, ew cil û lîbasê dawîn yê

çarçîya jîyana berzewal, bivê-nevê rojekê dê li wî were pêçan û bûyera mirinê jî, helbet dê mohra pûçkirinê li temamê zewqên berzewal û surdarîyên xapînok û meşğûlîyetan bixe!..

Ev tefekkura ku bi hesteke kûra îmanî hatiye xurtkirin, aramî û bextewarîyeke daîmî didin; mana di nav tixûbê eqlê ziwa yê xalis de, temakarî, ezperestî û xwemezinkirinê zêde dike, qelb lawaz dike û wî bi ğefletê mûbtela dike.

Çawa şopa telîyan wekî nasmaneyeke kesayetî ye, eynî wisan wesf, xusûsîyet û taybetmendîya mûmînî ya di pêhis û tefekkurê de jî wekî nasnameya manewî ya wî ye. Li ser vî esasî, kîjan mûmîn bixwaze kûrbûna rûhî qezenc bike, bixwaze di asteke layiqê şerefa însan de bijî û bi awayekî bi armanca xulqbûna xwe re ahengsaz bijî, divê ew xwe bixe wê hewaya tefekkurê, ewa ku Qur'ana pîroz îzah kiriye. Lewra xuşû û tirsa di îbadetan de, tenikbûna di dil de û hezkirin û nezaketa di têkilîyên bi mirovan re, pêkan e, bes bi tefekkureke wekî vê bicih bibe.

Digel giringîya ku dînê me bi pêhis û tefekkurê daye jî, însan ji ber ğefleta xwe ya ku zêde giranîyê dide meşğûlîyet û derdên dinyayî, bi giştî ew ji pêhis û tefekkura heqîqî dûr dijî. Di encama vê de jî însan mirinê jibîr dike û ev heqîqet jî nayê bîra wî; ev dinya mala îmtîhanê ye!

Lêbelê ew mûmînên ku bi teqwayê dijîn û bi awayê me gotî, dikarin pêhis û tefekkur bikin -ev jî tim û daîm hindikahî ne- ha ew li dijî şehwet û nefsên xwe biser dikevin û digihîjin kemal û gihanê. Ha ew dikarin heqîqetên xwe yên însanî, lawazîyên xwe û taybetmendîyên xwe fehm bikin.

Evên wiha, digel heyata zahirî ya ku ew têde dijîn jî, lê ew di heman demê de peywendîya xwe bi rûhanîyeke ebedî ve çêdikin, ew jî hewayeke derûnî bi wan dide qezenckirin. Di encama ferehbûna dilê wan de, ew digihine têgihiştineke bilind ku ew ji asoyên alema maddî ya temaşeber derbas dibe. Ev jî nîmeteke îlahî ye, ew mirovê ku bi vî awayî ji xwe îmana kamil hasil kiribe, pêkan e bigihîje wê.

Her wiha ew mûmînê heqîqîyê ku dikare bibe xwediyê van sifetan, piştî vê, êdî ew nikare bi çavê ku ew nîmeteke hêja ye li heyatê binêre û meyla xwe bidiyê. Rojên dinyayê di çavê mûmînê xwediyê van sifetan de her wekî meqerekê ye ku metrajên wê li ser nehatibin nivîsîn û her wekî werîsekî ye ku her wext û anê dibe ku bi şûn de bifetile û vebe.

Digel vê jî, giringîyeke mezin ji bo sermîyanê emr û temen heye. Lewra ew sermîyanê tek e ku mirov karibe pê jîyana ebedî qezenc bike. Kîjan mûmîn bigihîje vê îdrak û têgihiştinê, ew dizane heke bi mûcibê vê ayeta pîroz: **"Wekî ku ferman li te hatiye kirin xwe**

**rast û durust bike."**[9] Emel neke, ewê di dawîyê de zehf poşman bibe. Ji bo ew ğemgîn nebe û ew bi ber vê poşmanîyê nekeve, divê ew ti caran ji vê gotina Xuda Teala ğafil nebe:

**"Ji wî rizqê ku me daye we, hinekê înfaq bikin beriya ku mirin, were yekî ji we, ji nû ve bibêje: Xudayê min! Çima heta demeke nêzîk te mirina min neda paş da ku min sedeqe bidaya û ez bibûma ji qencîkaran! Xuda, dema ecelê kesekî were hîç li paş nahêle. Lewra Xuda, ji emelê ku hûn dikin, agahdar e."**[10]

Welhasil; Heq Teala ji her mûmînî dixwaze ku ew mahîyeta mezinatîya îlahî û hikmeta di vê riste û nîzama mezin de û mahîyeta wê ya rasteqîne fehm bike. Di netîceya vê de, Xuda Teala ji evdê xwe dixwaze ku ew îtîmadê li nîmetên mirok yên di dest xwe de neke. Bi vî awayî, ji bo ew bibe evdekî baş û ew wê jîyanê heq bike ku esasê wê teqwa ye û li axretê jî cennet e.

Her wiha em di vê berhema xwe ya naçîzane [ne ti tişt] de, hewl didin li ser ehemmîyet û giringîya tefekkurê, feydên wê û çawanîya tehqîqbûna wê rawestin. Lewra tefekkur yek ji giringtirîn sunnetên pêğemberê [dirûd û silavên Xuda lê bin] me ye.

Ez bi vê wesîlê, malavahî û spasîyên xwe ji Dr. Mûrad Kaya û M. Akîf Gunay re pêşkêş dikin. Lewra

9 Hûd, 112.
10 Mûnafîqûn, 63/10-11.

herduyan di amadekirina vê kitêbê de arîkarîya min kirine. Ez, lavlavê ji Xuda Teala dikim ku ew vê keda ha di şehîna xêr û hesenatên wan de bike sedeqekeke carîye.

**Xudayê me, hest û fikrên me bi rizaya xwe îslah bike. Bi tewfîq û serxistinê qencîya xwe li me tevan bike da ku em karibin temen û emrê xwe yê fanî bi vî wesfî temam bikin û em bigihin zirwa merîfet û hezkirina te.. Amîn!.**

# TEFEKKUR
# di kaînat, însan û qur'anê de

## Tixûbê Eql

Îslam, nirx û qîmetekî mezin dide eqlî. Ji lewma wî yek ji herdu şertên berpirsîyê dijimêre.[1] Ew bi her wesîlê, însan hîn dike ka ewê çawa eqlê xwe bi wesîle û navgîna layiq bikarbîne. Digel vê jî, ew eşkere dike ku şîyana însan di fehmkirina heqîqetên kaînatê de ne bêtixûb e. Lewra Heq Teala, ji bo ti mexlûqekî xwe şîyana bê tixûb nedaye.

Çawa şîyana nêrînê bi şîyana çav û şîyana bihîstinê jî bi şîyana guhan sînordar e; eynî wisan şîyana têgihiştinê jî bi şîyana eql sînordar e.

Çawa hebûneke bêsînor heye, ne pêkan e çav wê bibîne. Lewra ew ji şîyana dîtina bi çav mezintir e.

---

1 Li cem Xuda, şertekî berpirsbûnê baliğbûn e. Şertê din jî biaqilbûn e. Yanî ew e ku bi qasî karibe rastî û şaşîyê ji hev biqetîne, eqlê wî sitewîyabe. Bi vê pîvanê, di nêrîna îslamê de zarok û dîn, ji kirinên xwe ne berpirs in.

Dengên bê hijmar jî hene, ne pêkan e guh wan bibihîzin. Lewra ew di ser asta bihîstina bi guhan re ne. Bêşiwar gellek heqîqet jî hene, ew li derveyî têgihiştin û îdraka eql in. Lewra hêza însan nikare wan fehm bike. Yanî eql bi tena serê xwe, ji bo têgihiştina wan têrê nake û ji xwe nikare heqîqetê tevî fehm bike.

Fîlozofên rasyonalîst [eqlperest] ên ku bawer dikirin eql di gihiştina heqîqet û fehmkirina wê de bêtixûb e, di şûna ku mirovên di bin bandora wan de mabûn bigihînin bextewarîya ku teleb dikirin; ew gihandin sefalet û bextreşîyê.[2]

---

2 Bûyereke bêhempa li Yewnana kevnar qewimî, wê zeîfbûna eql û sînordarbûna şîyana wî nîşan dida. Ciwanek çû ber destê fîlozofekî ji bo li ber destê wî dersa hiqûqê bixwîne. Ji bo vê, wî dê nîvê wê heqdesta ku li serê li hev kiribûn, pêşîn bida, ew nîvê mayî jî, çi çaxê ku xwendekar bibe hiqûqnas û doza ku pêşî qezenc bike, ewê hingê wê bide. Mana wê ev bû; heke xwendekar doza pêşî qezenc bike, xwendina wî mûkemmel bûye û seydayê wî jî ew nîvê heqdestê yê din jî heq kiriye. Lêbelê di dawîya tehsîla xwe de xwendekar teqsîta yekê kafî û bes dibîne û jê dixwaze ew li teqsîta duduyan bibûre. Ji ber vê daxwazê, doza pêşî di navbera xwendekar û seydayê wî de tehqîq dibe.

Di rûniştinê de xwendekar vê ji heyeta dadgehê re dibêje:

"- Heke ez vê dozê qezenc bikim û qezenc nekim jî divê ez vê heqdestê bidim."

Dadger jê re got:

"- Çima?" Xwendekarî wiha îzah kir:

"- Heke ez vê dozê qezenc bikim bi mûcibê biryara we divê ez bidim; heke ez wê qezenc nekim jî, ji ber ku min doza pêşî qezenc nekiriye, bi mûcibê lihevkirina di navbera min û dozdarî de divê ez vê teqsîtê bidimê.

Bêşiwar Xuda Teala mirov xuliqandine û ew ji wan bêhtir xusûsîyet û taybetmendîyên evdên xwe dizane, ji lewma bi gorî rîwayetan Xuda Teala di dirêjahîya tarîxa însanîyetê de nêzî sed û bîst û çar hezar pêğember û resûl şandine ji bo zeîftîya eql û têrênekirina wî ya di gihiştina heqîqetê de telafî bike. Ew sihûf û kitêbên ku Xuda Teala bi rêya wehîyê ji pêğemberan re şandine, çêtirîn arîkar bûne ji bo însan bigihînin heqîqetê û heqîqetê jî bigihînin wî.

Li ser vî esasî, terbîyekirina eql bi wehîyê şertekî lazim e. Lewra ew eqlê ku di ronahîya îrşad û rêşanîkirina beyanatên îlahî de terbîye nebe, ew her wekî hespekî har e ku ne pêkan e mirov, pê bigihîje

---

Fîlozofê seydayê wî wiha got;

"- Heke ez vê dozê qezenc bikim û qezenc nekim jî divê ez vê heqdestê bistînim." Dîsa dadger got;

"- Çima?" Wî jî ev bersiv da:

"- Heke ez qezenc bikim bi mûcibê biryara we ezê wê bistînim; heke ez qezenc nekim, bi mûcibê lihevkirina navbera min û dozdarî divê ez wê heqdestê bistînim. Lewra heke ez dozê qezenc nekim, hingê wî ew qezenc kiriye û bi vî awayî şertê teqsîtê duduyan jî hatiye cih û deyn ketiye stûyê wî.

Wekî tê dîtin, herdu jî di îddîaya xwe de zehf eqlber û bi mentiqî bûn. Naxwe wekî vê nimûnê, dibe ku eql û mentiq car caran xwe bixe zindanên ku dibîne û xwe bixe kolaneke kor. Ew eqlê ku di çareserkirina gellek îxtîlafên beşerî yên wekî van de bêçare dimîne û kilîtê li xwe dixe, ne pêkan e, ew hemû heqîqetên îlahî yên bê nîhayet bi her aliyên wan ve fehm bike. Ji ber vê sedemê, selametîya eql ji xeteran di vê de ye; divê eql bi wehîyê terbîye bibe û ji bo heqîqetên ku ji tixûbê wî dibûrin jî bi dilê xwe teslîm bibe.

hedefê. Her wiha eger û îhtîmaleke xurt heye ku pêyên wî bişemitin û ew rûbirûyî xeterê jî bibe.

Ji ber vê sedemê, çawa bi gem û liğabê terbîyekirina vî hespî bi awayekî tekûz lazim e ji bo mirov ji enerjîya wî îstîfade bike. Her wiha zehf zerûrî ye ku mirov eql jî bi terbîya manewî terbîye bike ku hîmê wê jî wehî û sunneta pak e, da ku mirov wî bigihîne asta "eqlê selîm". Heta ew bi wehîyê neyê terbîyekirin, ewê her wekî sîlah û çekeke du dev be; ewê ji xêrê re bibe wesîle û ewê ji şerrê [xirabîyê] re jî bibe wesîle.

## Wezîfeya Qelb

Di nezer û nêrîna Îslamê de **Îman**; bi tesdîqa bi qelb û bi iqrara bi ziman çêdibe. Yanî tecellîgeha eslî ji bo îmanê ne eql e, lê dil ku merkez û navenda hest û pêhisê ye. Ev mijar zehf mûhîm û giring e. Lewra îman, pêhiseke bilind û hesteke bala ye. Herçî eql e, wesîlekeke lazim û zerûrî ye ji bo gihiştina hesta îmanê û derbasbûna merhele û pêvajoyên pêzan û eşkere yên ku vê xusûsê bicih dikin.

Heqîqetên îlahî yên ku bi eql meqbûl û bi zêhn tên bawerkirin, heke bi qelb neyên tesdîqkirin, îmaneke heqîqî nayê meydanê. Heta îman di qelb de bicih nebe, ew bi emel û kar wernagere û îstîqametê jî bi reftar û teserrufatîyan nade. Dema ev pêkneyê, li cem Xuda Teala ji bo emel û kar ti nirx û qîmet nabe. Heq Teala,

ew kesên ku heqîyê nas dikin; lê ji ber ğafilbûna dilên wan di heqîqetên wan nagihin bi wan merkeb û keran dişibihîne ku barê kitêban hildigrin.

Xuda Teala dibêje:

**"Nimûna wan kesên ku Tewrat li wan hatibû barkirin, paşê ew hilnegirtine wekî nimûna ker e ku kitêban hildigre! Çi xirab e nimûna qewmê ku ayetên Xuda tekzîb kirine! Xuda, qewmê zaliman nayêne ser rêya rast û durust."**[3]

Ji ber vê sedemê naskirina heqîqetên îlahî, ne depokirina wan di zêhn tenê de ye; lê di encama naskirin, tefekkur kirin û pêhesînê de çareserkirina jîyanê, asêpirsa nîzama mezin û emelkirina bi mûcibê vê naskirinê ye. Ew qelbê ku ji nûra îmanê tije bûbe, vî emelî dike.

Ew netîceya ku eql, dema di însan, kaînat û Qur'ana ku di wan de ji bo heqîqetan wekî neynikê ye, bidest dixe, wekî wan madenên xam e ku ji zikê erdê tên derxistin. Qelb e, yê ku van madenan dixe hilberan.

Qelb, merkeza tefekkur, hest û pêhisê ye. Fonksîyon û wezîfa qelb, bi peyvên "heds, îlham û sunûhat" tê îfadekirin, dema ew bi delîlên ku eql pêşkêş dike re yek bibin, têgihiştina heqîqetan bi mana wan ya kamil temîn dike; Eynî wekî vazo û guldankeke

3 Cumûe, 5.

şikestî ye, ku bi yek kirina perçên wê û nûjenkirina wê derxistina şekl û awayê wê yê eslî çêdibe.

Naxwe, em dikarin bibêjin; Bi awayekî tekûz û sipehîtirîn gihiştina heq û xêrê bi terbîyekirina eql ya bi wehîyê mûmkin dibe. Lêbelê di nuqta ku eql bêçare bibe û têrê neke de jî, hingê eqlê tije îman dê bikeve dewrê û ewê wê kêmasîyê bi teslîmîyetê telafî û tije bike.

Qîmetê tefekkurê, bi teqwîye û xurtkirina wê ya bi tedebburê ye, yanî pêbendê şiğulandina fonksîyonên dil û eql bi hev re di nav aheng û hevkêşîyeke durust de ye. Heke însan giranîyê bi eql û zêhn tenê bide, dibe ku însan bibe miroveki baş ji bo dinyayê, yanî bibe mirovê menfîetê. Lêbelê ji bo însan bibe mûmînekî kamil, divê qelbê ku merkeza pêhis û hestan e, bi perwerda menewî terbîye bike û divê ew qelb jî bibe rêzanê eql. Lewra qelbê ku merkeza pêhisê ye, ew berê eql dide tefekkurê. Tefekkur jî berê eql dide îradê. Naxwe em dikarin bibêjin; Sedemê esasî ji bo kirinên îradî qelb e. Têde pêhis bicih dibin û koka xwe berdidin. Ji vê hêlê ve, rûniştandina dil û bicihkirina wî di çarçoveya fermanên îlahî de ji azayên din giringtir e.

Lewra tefekkura eqlî di hewaya arzûyên nefsanî û mehrûmbûna ji rêşanîdanên qelbê selîm de di bin bandora nexweşîyên dilî yên her wekî xwedbînî, serxweveçûn û xwemezinkirinê de, ji mecra xwe ya eslî û bingehîn derdikeve û wekî Şeytên însan bi alîyê rêşaşî û jirêderketinê ve diajoyê.

**Mewlana Celaleddînê Rûmî** dibêje; "Heke bi qasî eqlê şeytên îşqa wî jî hebûya, îro nediket rewşa Îblîs."

Naxwe eql bi tena serê xwe ti nirx û qîmetekî îfade nake, divê mirov pêhisên eql xurt bike û ji hêla manewî ve wan kamil bike ji bo îstîqameta rast û durust bide eql.

Bi kurtî; tefekkureke heqîqî, ji wê nuqta ku têde eqlekî bi nûra wehîyê rohnî bûbe û qelbekî ku ji hêla manewî ve gihabe, bigihin hev de destpê dike. Em jî dema di vê kitêbê de mefhûm û têgihaya tefekkurê bikartînin, emê jê, şeklê wê yê meqbûl qesd dikin; ewê ku bi heqîqetên îlahî terbîye bûbe û bi pêhisa qelbî jî xurt bûbe.

**Tefekkur** (اَلتَّفَكُّر) ji hêla mena peyvê ve "kûrbûn û eql şiğulandina di tiştekî de ji bo îbret-girtinê ye."

**Teemmul** (اَلتَّأَمُّل); bi mena rawestin û hizirîn, dewamkirina tefekkurê û baş lêkolîn-kirinê tê. Hûr hûr hizirîna li ser bûyer û kaînatê ye ji bo girtina îbret, nesîhet û gihiştina heqîqetê.

**Tedebbur** (اَلتَّدَبُّر); hizirîna li ser encam û netîceyên karekî ye.

Îro, em van hemû manan bes bi îfadeyên **"tefekkur-kirin û hizirkirinê"** îfade dikin. Bêşiwar ev hal, encameke tehl e, ji bo xîyaneta texrîbata tirsnaka ku di zimanê me de peyda bûye. Ev jî pêk hatiye, ji bo milletê me yê ezîz ji kultur û çanda wî ya îslamî ya eslî dûr bike.

Lewra însan bi peyvan difikre. Ne pêkan e mirov, bi zimanekî xirto-pirto û lihevxistî mefhûm û peyvên ku navgînên wan e, xweş îfade bike û ji bo asoyên tefekkura îslamî ya kûr û fereh were vekirin. Ji vê hêlê ve, divê em xwediyê li peyvên ku ji kultura Qur'anê tên, bikin, em wan bikar bînin, bidin jîyandin û em îtîbarê nedin peyvên lêanîn yên ku xwestine, bikevin şûna wan.

## Giringîya Tefekkurê

Di kitêba Xuda û hedîsên şerîf de di bara hûrkolîn, lêgerîn, tefekkur-kirin û îbret standinê de gellek ferman, navtêdan û berêdan hene. Di vê mijarê de di Qur'ana pîroz de bi sedan ayet hene; lê emê duduyan tenê ji wan zikr bikin.

Xuda Teala dibêje: **"Ma ew xwe bi xwe nafikirin ku Ellah, asîman û erd û yên ku di navbera wan de hene, bes bi heqî û ji bo demeke navlêkirî aferandine? Bi rastî pirr kes ji mirovan çavlêketina Xudayê xwe bawer nakin!"**[4]

Xuda Teala dibêje: **"Bibêje: Ez, ji van herdu tiştan tenê bi yekê şîretê li we dikim. Ji bo Ellah dudu û yeka yek rabin li pêşberî min rawestin, piştre baş bifikrin; bi hevalê we re ti dînîtî nîn e; beriya ezabekî dijwar ew, ji we re bes hişyarker e."**[5]

4 Rûm, 30/8.
5 Sebe, 34/46.

Li vir, wesîyet li mirovan hatiye kirin ku însan kom bi kom û yek bi yek ji Xuda Teala re îbadetê bikin û li ser heqîqetê baş bifikrin.[6] Ji wan re soz hatiye dayîn; heke ew vê şîretê tenê jî bigrin, ewê xilas bibin.

## **Pêğemberê Xuda** [dirûd û silavên Xuda lê bin] **di her rewşê de difikrî**

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] zehf ji sikût, huşbûn û tefekkurê hez dikir. Di dema nêzîkbûna pêğembertîya xwe de zehf arzû dikir ku bikeve xelwetê, ûzletê, bi tenê bimîne û xwe bikişîne goşeyekê. Ew li Mekke mûkerrem diçû şikefta Hîrayê, ya ku kêmzêde 5 km mesafe di navbera wê û Mekkê de hebû û li wir jî, bi rojan dima. Îbadetê wî di vê ûzletê [bi tenêmanê] de; tefekkur kirin, wekî kalê xwe Îbrahîm [silavên Xuda lê bin] îbret girtina ji mexlûqatên erd û asîmanan û seyrkirin û temaşe-kirina li Ke'bê bû.[7] Heq Teala bi vî awayî, ronahîya çavên me [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo wezîfa pîroz amade dikir.

6 Fikra civak û pirranîyê, bi giştî tesîrê li ser fikra ferd û takekesan dike. Rêya xilasbûna ji vê tesîrê û dîtina heqîqetê mûraceetkirina ji bo nêrîna ehlê heqîqetê, bi dilê xwe re bi tenê bimîne û bikeve hewaya tefekkurê. Bi dîtina vê ayetê, ew hukmên ku zekaya hevbeş wan tîne holê, nake lazimê xwe ku her dem rast bin, yan jî nêzîkî rastiyê bin. Ji lewma divê her ferd, fikrê xwe yê azad bîne zimên, van biryarên giştî bi durustî tenkîd bike û bigihîje fikira azad û rast.

7 Ûmdetû'l-Qarî, ya Eynî, Beyrût, bd, c, 61-c 14, rûpel, 128.

Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] di wan rojan de di bara kaînat û aferînerê wê de tefekkur dikir, di jîyana xwe ya piştî wê de jî her tim di halê tefekkurê de bû.

**Hind keça Ebû-hale** wiha dibêje: "Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] her dem ğemgîn û bi tefekkur bû. Rehetî jê re nebû. Ew pûç nediaxivî. Wî kêm xeber dida û ew zehf huş dibû. Dema wî dest bi axaftinê dikir û dema dawî li axaftinê dianî jî her bi navê Xuda zikr dikir, digot..."[8]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di mijara teşwîqkirina ummeta xwe li ser tefekkurê de jî wiha digot: **"Xuda bi neh tiştan ferman li min kiriye; Hem di dizîkahî, hem jî di eşkerehîyê de ji Xuda bitirse. Di hêrsbûn û keyfxweşbûnê de edaletê bibêje. Hem di xizanî hem jî di dewlemendîyê de biteserruf be. Kî têkilîyê ji te qut bike, tu têkilîya xwe jê qut neke. Kî nede te, tu bide wî. Kî neheqîyê li te bike tu wî efû bike. Bila huşbûna te tefekkur be. Bila axaftina te zikr be. Bila nêrîna te îbret-girtin be û şîreta qencîyê bike."**[9]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dîsa dibêje: **"Îbadetekî wekî tefekkurê nîn e."**[10]

"Li dinyayê bibin wekî mêhvanan! Mizgeftan ji xwe re bikin mal!. Dilên xwe hînî tenikbûnê bikin!

8 Îbn S'ad, 1, 422-423.
9 Rezîn ew rîwayet kiriye. Camîûl Ûsûl, 11, 786, jimar, 7139.
10 Beyheqî, Şûeb, c, 4,157.

Zehf tefekkur bikin û zehf bigrîn! Bila arzûyên we yên nefsanî we neguherînin!. Hûn xanîyên ku di wan de nasekinin, ava dikin. Hûn malê ku jê naxwin, kom dikin û hûn tişta ku tênagihin, teemmul dikin!"[11]

Her wiha Ebûzerrê Ğifarî dibêje; ez li cem pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rûniştim, min jê re got; ya pêğemberê Xuda! Çi di sihûfên Îbrahîm [silavên Xuda lê bin] de hebûn? Ji min re got: "Ew tev mîsalê wiha bûn: Ey hukmdarê, desthilatê, mûbtelayê, serxweveçûyî! Min tu neşandî ji bo [malê] dinyayê li hev kom bikî; lêbelê min tu şandî ji bo tu gazîya yê mezlûm ji min vegerînî. Lewra ez wê bê bersiv nahêlim çendan ew ji mirovê kafir be jî. Di wan de mîsalê wiha jî hebûn: Divê mirovê eqilmend, bi eqlê xwe serxweve neçe; divê ji eqlmendî re hinek wextên malûm hebin; di hinek wextê xwe de dûa û mûnacatê bi Xudayê xwe re bike. Di hinek wextê xwe de hesabê ji xwe bipirse. Di hinek wextê xwe de di hunerê Xudayê xwe û qudreta wî de tefekkur bike. Di hinek wextê xwe de bi xwarin û vexwarina xwe ve bilebike. Divê eqilmend ne xwazyar û çikûs be; heke ne ji bo sê tiştan be; zad peydakirin ji bo axreta xwe be, yan meram û hedefek ji bo peydakirina jîyana xwe be, yan jî lezzeteke di neheramîyê de be. Divê eqilmend ji bo serdema xwe pêşebîn be, berê wî li ser plan-danîna ji bo karê wî be. Divê ew zimanê xwe biparêze. Naxwe peyva kî ji emelê wî were hesabkirin, peyva wî hindik

11 Ebûneîm, el-Hulîye, c 1, 358, Suyûtî, Camîûl Ehadîs, hijmar, 15843.

dibe; lêbelê heke peyva wî di bara karê ku wî elaqedar dike de be, hingê ğem nake."[12]

Luqman [silavên Xuda lê bin] hez dikir bi tena serê xwe li cihekî aram rûne û tefekkur bike. Wî ev zehf caran dubare dikir. Çi dema jê hate pirsîn:

"-Tu, bi giştî bi tena serê xwe rûdinî, ma ku tu bi mirovan re rûnî û bi wan re sohbet bikî, ne çêtir e?" Wî wiha bersiv da:

"-Heke mirov mideheke dirêj bi tena serê xwe bimîne, ji bo tefekkurê çêtir e. Tefekkura dirêj jî rêzan e, mirov dibe cennetê."[13]

**Ebûdderda** digot: **"Saetek tefekkur, ji îbadetê nafîle yê çil şevan çêtir e."**[14]

Çi dema ji **Saîd kurê Museyyeb** alimê tebîînan hate pirsîn;

"-Kîjan îbadet çêtir e?" Wî ev bersiv da:

**"-Di bara mexlûqatên wî de tefekkur û di bara dînê wî de jî tefeqquh**/bûna xwediyê têgihiştina hûr/**e."**[15]

**Bişrê Hafî** jî giringîya tefekkurê wiha îfade dikir:

---

12 Ebûneîm, el-Hulîye, c 1, 167.

13 Îmam Ğezalî, Îhyaû Ûlûmuddîn, Beyrût, 1990, Darûl Xeyr, c, 6/, 45. Li Tersûsê li mizgefteke tarîxî, cihê ku Luqman [silavên Xuda lê bin] lê ketî îtîkaf û tefekkurê, heta di roja me ya îro de jî meqam e û tê zîyaretkirin.

14 Deylemî, 2, 70-71, jimar, 2397, 2400.

15 Bûrsewî, Rûhûl Beyan, tefsîra sûretê Nûr, ayet 44.

"Heke însanan bi heqî di bara ezemeta [mezinatîya] Xuda Teala de tefekkur bikirana, wan dê nikarîba li hemberî wî îsyan bikira, guneh bikira."[16]

Wekî ku me berê jî îfade kiribû; tefekkur e, ya ku berê însan dide ser têgihiştina mezinatîya Xuda Teala, ew jî faîlîyet û çalakîyeke eqlî ye. Yê ku vê cehd û çalakîyê digihîne netîcekeke kamil, ew jî qelb e. Madem qelbê me bişereftirîn azayê me ye, naxwe zehf tebîî ye ku emelê wî jî ji emelê azayên din çêtir be. Lewra qelb nezergeha îlahî ye.

Ev heqîqeteke zehf eşkere ye; tefekkura eqlê ku bi wehîyê terbîye bûbe, ew fêkîyê yekê ye ji bo nûrên ku qelb rohnî dike, ew jî yekem rê û wesîle ye ku mirov digihîne besîret û îrfanê. Dîsa tefekkureke wiha, ji bo îlm, zuhd, terka masîyetan û muhebbeta îlahî navgîn û wesîle ye.

Tefekkura bi haviltirîn jî, tefekkur-kirina qudreta îlahî, ezemet û hukmranîya wî ye. Di siha vê tefekkurê de însan, di îslahkirina heyata dinyayê, terk-kirina tiştên ku zirarê didin axreta wî û rêyên van de difikre.

Dema însan nîmetên Xuda, îhsanên wî, emr û nehîyên [ferman û qedeğeyên] wî, nav û sifetên wî tefekkur dike, tov û zîğên muhebbet û merîfetê di qelbê wî de şîn dibin û ew dest bi qezenckirina sewîye û asteke manewî dike. Dema însan axretê tefekkur dike, dema tefekkur dike ku dinya şûnwarê îmtîhan

16 Îbn Kesîr, 1, 448. Al-î Îmran, 190.

û fenabûnê ye; axret jî mala şeref û beqayê ye, hingê reğbet û dilxwazîya wî ji bo axretê zêde dibe û ew bi qasî ku lazim be, qîmet û giringîyê bi dinyayê dide. Ew baş têdigihe ku heyata dinyayê di navbera malzarok û qebrê de rêveçûneke bi bazdan e. Ew fehm dike ku emr/temen çêtirîn sermîyan e ji bo qezenckirina seadet û bextewarîya axretê. Ji lewma ew ji bo bêhtir bi bereketkirina wî jidilî û hewldanên xwe zêdetir dike. Ew wextên xwe ğenîmet dizane, wan bi awayê sipehîtirîn û çêtirîn dinirxîne; di emelên salih, xêr û sewabê [rast û durustîyê] de dibûrîne.

**Ebûl-Hesen el-Xereqanî** çi xweş dibêje: "Divê her tim azayekî mûmînî bi Xudayê bilind ve meşğûl bibe. Divê mûmînek, yan bi qelbê xwe Xuda Teala bîne bîra xwe, yan bi zimanê xwe zikrê wî bike, yan bi çavê xwe tiştekî bibîne ku Xuda dixwaze ew wê bibîne, yan bi destê xwe comerdîyê bike, yan bi lingên xwe însanan zîyaret bike, yan bi serê [eqlê] xwe xizmetê ji mûmînan re bike, yan bi bawerîyeke qet'î dûa bike, yan bi eqlê xwe tefekkur bike û kar bike ji bo bi merîfetê bigihe, yan karekî bi îxlas bike, yan jî mirovan ji dijwarîyên Qiyametê şîyar û îqaz bike.

Ez ji bo mirovekî wiha kefîl im ku ew çawa serê xwe ji qebrê rake, ewê kefenê xwe li pey xwe bikişîne û biçe cennetê!"[17]

17 Ebûl-Hesen el-Xereqanî, Seyr û Sulûk Rîsalesî, Rûpel, Sofi Kitap 107, İstanbul-2006.



# Tefekkur-kirina Di Kaînatê De

*Însan çi ecêb e ku dema qesreke nexişandî û zehf mûzeyyen bibîne, jê re heyran dimîne! Wê ji bîra xwe nabe û heta sağ be her behsa nexş û sipehîtîyên wê dike. Lêbelê ew tim vê kaînata mûezzema ku xarîqûl-addeyeke hunera îlahî ye, dibîne, bi awayekî layiq hûrîtîya hostatîya têde nafikre û behsa wê nake. Wekî ku tişteke normal be, li serê nasekine, derbas dibe û diçe. Eynî wekî zinarekî ku tavîyên barana biharê di ser de dikişin û derbas dibin; lê ew hîç nesîbê xwe ji wan nagire. Hal-hal e, ew qesra fanî û miroka ku ew jê re heyran maye, ew zerreyeke biçûçik ya vê dinyayê ye ku ew jî cismekî biçûçik ji vê kaînata mûezzem e...*

# TEFEKKUR-KİRİNA Dİ KAÎNATÊ DE

Di vê cîhanê de ji zerreyê bigre heta bigihe gerdûna gurover çi hebin, her yek ji wan hunerekî xarîqûlade yê îlahî ye. Kaînat di her alîyan de bi tecellî-kirina hikmetên bêjimar pêşangeheke hunerî ye, ji bo nexş û lewhên şîyan û qudreta îlahî ku ew li pêşberî têgihiştina însanî tên rapêşkirin û raxistin.

**Kaînat;** bi xulqîyeta xwe, bi riste û nîzama xwe û bi ahenga xwe, ji bo mirovên ku ehlê tefekkurê bin, wesîle û navgîneke giringa îbret-girtinê ye. Gellek ayetên pîroz hene, vê manê îfade dikin.

Heq Teala wiha dibêje: **"Ma ew li asîmanê ser xwe re nanêrin ku me ew çawa bêstûn ava kiriye, me ew bi stêran xemilandiye û di wî de ti derz û terkek jî nîn e. Me, erd jî raxistiye, me tê de çiyayên sabit durist kirine da ku neheje û me, li wê ji her çînîyên giyayê dîmen-sipehî, şîn kirine. Me ev tev kirine, da ku ji bo her bendeyê ku li Xuda vegere, bibin 'îbret, heq-dîtin û dibîranîn."**[18]

18 Qaf, 50/6-8.

Xuda Teala di ayeteke din de wiha dibêje: **"Ma tu nabînî ku bêguman Xuda, ji banî avekê dadixe xwarê, wê dixe kehniyên ser erdê, piştre bi wê, çandiniyên rengên wan curbecur derdixe, hêşîn dike? Piştre ew hişk dibe, tu dibînî ku ew, zer dibe. Piştre wê dike qirşûqal. Bêşiwar di van de ji bo xwedî-'eqlan 'îbretek û dibîranînek heye."**[19]

Ew ava ku li ser erdê dimîne, xizmetê ji mirovan re dike. Ew, di xwarina wan, vexwarina wan, paqijîya wan û temînkirina îhtiyacên curecurên wan de tê bikaranîn. Ji lewma ew car caran dilewite. Lêbelê Heq Teala wê bi sîstemeke hûr û durust paqij dike û wê dubare ji evdên xwe re bexş dike.

Hz. Mewlana dixwaze em cihê guhertina avê tefekkur bikin. Ew wiha dibêje:

"Dema zelalîya avê nemîne, yanî ew jî bibe herî û şîlo dibe, ew jî wekî me, ji ber ku li ser erdê lewitiye, ne rehet dibe, şaşo maşo dibe. Ew ji hinavê xwe dest bi feryad û fîğanê dike û hawara xwe digihîne Heq Teala. Ji ber vê feryad û hawarê, Heq Teala wê dixe buxar û dibe asîmanî. Ew li wir bi rêyên curbecur tê hekandin û tertemîz dike. Paşê jî wê carina dixe baran, carina dixe berf û carina jî dixe teyrok û li ser erdê dibarîne. Di dawîyê de jî wê digihîne behreke fereh."

19 Zumer, 39/21.

Ev bûyera siriştî ya ku em di her mewsim û demsalê de temaşe dikin, Mewlana wê diguhêze û bi rêya îşaretê wiha ji însan re dibêje:

“Wekî ku av li asîmanî paqij dibe, tu jî wisan nêzîkî Heq Teala bibe û qelbê xwe ji hemû qirêjan pak bike! Bi vî awayî, tu jî bibe wekî baranê; bereket û rehmê bipijiqîne!”

Ji alîyê din ve, rêveçûna ahengdara kaînatê ya ku ji dema xulqbûna xwe ve li serê digere, nîzama wê ya ku hîç şaş nabe û hikmet û sirrên wê yên bêdawî yên di nav hev de, têrê dike ku mirov fehm bike, her tişt berhema qudreteke yek û bêdawî ye.

## Tefekkur-kirina di Asîmanan de

Delîlek ji delîlên qudret û ezemeta Heq Teala jî seltenet û desthilatîya wî ye ku di erd û asîmanan û stêran de tê pêşankirin. Tefekkur nekirina di xarîqûladeyên asîmanan de dibe sebeb ku îdrak û têgihiştina însan ji hikmeteke mûezzem bêpar û mehrûm bimîne.

Sererd, li ber asîmanan wekî dilopek ava di behrê de ye. Heta ev ji wê jî biçûktir e. Lewra di Qur’ana pîroz de sûretek nîn e ku di ayetên curbecurên wî de behsa ezemeta asîmanan nekiribe! Gellek sûnd hene ku bi asîmanan hatine xwarin.

Heq Teala wiha dibêje: **"Ez, bi asîmanê xwedan burc sûnd dixwim!"**[20]

Heq Teala wiha dibêje: **"Na! Ez bi cihên stêran sûnd dixwim ku hûn zanibin, ev sûndeke mezin e."**[21]

Ferehîya kaînatê, bizavên cismên têde û mesafeyên di navbera wan de bi reqemên ewqas mezin tên îfadekirin ku hêza însan nikare wan fehm bike, heta ew nikare wan xeyal jî bike.

Heta alimen mecbûr mane ku wiha bibêjin:

Kaînat, ji xeyala me tirsnaktir, dehşetdartir û mezintir e. Lewra cismên li kaînatê di fezayê de bi lezûbezeke tirsnak ji hev dûr dibin.

Zanayên astronomîyê, nîvçapa kaînatê 14 trîlyon sala ronahî texmîn dikin. Leza ronahîyê jî di hûredemekê [sanîyekê] de kêm-zêde 300 hezar km. ye.

## Galaksî/Felek

Li asîmanî bi çend sed mîlyaran galaksî hene, dîtina wan bi teleskopên modern mûmkin dibe. Galaksî, komeke dêwane ya stêran e ku di nav xwe de bi deh mîlyonan heta bi mîlyarek stêr, yan jî maddeyên xam

20 Burûc, 1.
21 Waqîe, 75-76.
Ji bilî van, li van ayetan jî; Zarîyat, 7; Necm, 1; Tekwîr, 15; Tariq, 1; Şems, 1-2 5" binêre!

ên ku ji wan stêran mane, dihewîne.[22] Galaksîya koma sêwîyan ya ku sîstema tavê têde cih digre, yek ji van e.

Ew komên ku bi sedan, yan jî bi hezaran galaksîyan di nav xwe de digrin, ji wan re **"komên galaksîyan"** tê gotin. Ew komên ku ji civakên galaksîyan pêktên, ji wan re jî "koma supera galaksîyan" tê gotin[23]. Galaksîya koma sêwîyan ya ku sîstema me ya tavê têde cih digre û sih galaksîyên li nêzîkî me, pev re **koma xwecihîya galaksîyan** pêktînin.

**Koma Galaksîya Vîrgo** [simbil] ya ku yek ji komestêrên nêzîkî me ye, bi sala ronahîyê, kêm-zêde 65 mîlyonan dûr e, ew bi texmînî 2000 galaksîyan di xwe de dihewîne. Di komeke super [mezin] de jî bi dehan komên galaksîyan hene û çapa wê jî 100 mîlyon sala ronahîyê dibîne[24].

Tişteke din ku pertewa îhtîşama îlahî dide kaînatê, lihevketina galaksîyan e. Lihevketina galaksîyan bûyerne wisan e ku mirov zehf li wan rast tê. Heke rêgeha du galaksîyan li rasta hev were, yan jî ew bi awayekî têr nêzîkî hev bûbin, girseya kêşîyê, wan ber bi hev ve dikişîne. Galaksî, heke çi qas bi mîlyonan stêran di nav xwe de bihewînin jî, ji ber ku di navbera stêran

22 http:/ /www.biltek.tubitak. gov.tr, Evren/Evrenin Yapıtaşları/Gökadaa lar, (Erişim, 06.12.2005).

23 http:/ /www.biltek.tubitak. gov.tr, Evren/Gökbilim Sözlüğü, (Erişim, 06.12.2005).

24 http:/ /www.biltek.tubitak. gov.tr, Evren/Evrenin Yapıtaşları/Gökadaa lar/Gökadalar Kümeleri, (Erişim, 06.12.2005).

de dûrahîyeke mûezzem heye, di dema lihevketinê de ew bêyî ku bi hev bigihin derbas dibin û diçin. Lêbelê maddeya di navbera stêrên ku ji ğaz û tozê tên meydanê de, bi tesîra lihevketinê di cihên pêzan de li ser hev kom dibe û tengav dibe. Ev rewş, lezê li çêkirina stêran dike. Bi vê sedemê, di galaksîyên ku lihev dikevin de çavdêrîya peqînê di çêbûna stêran de pêktê. Tê texmînkirin ku piştî 3 mîlyar sal lihevketineke wiha di navbera galaksîyên Koma Sêwîyan û Andromedayê de çêbibe[25].

Lewra galaksîya Koma Sêwîyan û cîrana wê Andromeda bi leza di saetê de 500 hezar kîlometre ber bi hev û din ve nêzîk dibin. Ev herdu galaksî di navbera wan de mesafa 2,2 mîlyon sala ronahîyê heye, naxwe kêm-zêde ewê piştî 3 mîlyar sal lihev bikevin.[26]

Di Koma Sêwîyan de kêm-zêde 200 mîlyar stêr hene. Roj bes yeke tenê ji wan stêran e. Galaksîya Koma Sêwîyan di çapa 100.000 sala ronahîyê de ye. Ew di hûredemekê [sanîyekê] de bi leza 274 km-an digere û bi leza 900.000 km-an ber bi stêra Vega'yê ve hereket dike.

25 http://www.biltek.tubitak.gov.tr/Evren/EvreninYapıtaşları/Gökaadalar/Çarpışan Gökadalar, (Erişim,15.12.2005); http://www.biltek.tubitak. gov.tr/haberler/gokbilim/99-08-4.pdf

26 http:/www.newsandevents.utoronto.ca/bîn/000414b.asp;http:/www.biltek.tubitak. gov.tr/ haberler/gokbilim/2000-05-3.pdf

Civaka Galaksîya Herkulê ji 10.000 galaksîyên biçûk tê meydanê û bi sala ronahîyê 25.000 an ji dinyaya me dûr e.

### Sîstema Tavê

Sîstema tavê ya ku di koma sêwîyan de ye, di çapa 12 mîlyar km'an de ye. Temenê tavê 4,5-5 mîlyar sal tê hesabkirin. Tav, ji navenda koma sêwîyan bi 30.000 sala ronahîyê dûr e.

Di tavê de di her hûredemê [saniyê] de 564 mîlyon ton hîdrojen bi 560 mîlyon ton helyûmê werdigere. 4 mîlyon ton maddeya ğazê ya di navberê de jî bi awayê enerjî û tîrêjê belav dibe. Heke em bi gorî girseya ku tine bûye hesab bikin; tavê di her hûredemekê de 4 mîlyon ton û di her deqîqekekê de jî 240 mîlyon ton madde berze û winda kiriye. Heke tavê ji 3 mîlyar sal ve bi vê lezê enerjî hilberandibe, di nava vê midetî de girseya ku winda kiribe dê 400 mîlyar car mîlyon ton bibe ku ev qîmet, dîsa jî ji tevahîya girseya tavê ya vêga, bes bi qasî di 5000'an de yek dibe.

Pileya germê di banê tavê de 6000 santîgrat e. Pileya germahîyê di navenda wê de kêm-zêde 20 mîlyon santîgrat e. Germahîya tavê tim zêde dibe û çapa wê jî mezin dibe. Tava ku çapa wê tim mezin dibe, mûmkin e ku ew piştî demekê bi stêregerokên nêzîktirî xwe yên wekî Merkur, Venus, Dinya û Marsê de bipeqe û wan tine bike.

Girseya tavê 2 x $10^{27}$ yanî du car mîlyar car mîlyar ton e. Nîv-çapa dêwane ya 700.000 kîlometreya wê heye. Ew ji dinyayê bi 324.529 qatan mezintir e[27].

Heq Teala di ayeta pîroz de dibêje:

**"Ew Xudayê ku li asîmanî birc aferandine û dîsa di wan de çirağek [tav] û heyveke ronak xuliqandiye, mezin û bilind e!"**[28]

## Asîman Tim û daîm Fereh Dibin

Heq Teala bi awayekî sağlem û qewîn asîman ava kiriye û dibêje; ew tim û daîm fereh dibe.

Heq Teala di ayeta pîroz de wiha dibêje: **"Me, asîman bi hêz ava kiriye û bi rastî her em wî fereh jî dikin."**[29]

Aliman di sala 1929 'an de keşif kirin ku **nebûla**[30] ji galaksîya me dûr dikeve. Piştre ev keşif esas hat girtin û teorîya "her tim kaînat berfereh dibe" derxistin

27 Binêre; http: /www.phyics.metu.edu.tr/-ecevit/bilinen_evren_gerr cekleri.ppt, (Erişim: 21. 06. 2007); http: /gokyuzu.org (Erişim: 21. 06. 2007); http: /www.ozaltin.8k.com/NN/2.htm. (Erişim: 16. 10. 2004); Yüsuf el-Hâc, Mevsûatü'l- 'İcâzi'l-İlmî, S. 413-417; Ekrem Ahmed İdris, el-Felek ve't-Tıb Emâme Azameti'l-Kur'an, 19-112; Prof. Dr. Osman Çakmak, Bir Çekirdekti Kâinat, s. 66.

28 Furqan, 61.

29 Zarîyat, 47.

30 **Nebûla,** hinek lekeyên sipî ne, li fezayê tên dîtin lêbelê ne stêr in. Ew bi şewq û ğaz in, girseyên zehf mezin in. Ji ber ku dişibihin ewrên sipî ev nav li wan hatiye kirin.

holê[31]. Bi gorî vê teorîya ku bûye yek ji giringtirîn keşfên zanistî di sedsala bîstan de; galaksî, bi lezeke mûnasibî vê mesafa navbera wan, ji hev dûrbûna wan zêde dibe.[32]

Aliman di sala 1950'an de ev qanûn tetbîq kirin û leza ji hev dûrketina galaksîyan hesab kirin; galaksîyeke ku 10 mîlyon sala ronahîyê ji me dûr be, di hûredemekê [sanîyekê] de bi leza 250 kîlometreyan ji me dûr dikeve. Galaksîyeke ku 10 mîlyar sala ronahîyê ji me dûr be jî, di sanîyekê de bi leza 250.000 kîlometreyan e.[33]

**Kaînata ku em behsa ferehbûna wê dikin, ewa ku bi awayekî tim û daîm her mezin dibe, xuya dike ku ne pêkan e, em di ezemeta Xuda Teala bigihin û em bi awayekî tekûz wî fehm bikin.**

Şair [Alî Haydar Bey] li pêşberî kevalên bêjimar yên ezemeta îlahî yên wekî van heyranî çi xweş îfade dike:

**Xudayê m, tu mezin î, tu mezin î, mezin!**

**Her mezinatî li kêleka mezinatîya te, zehf biçûk e!**

Heq Teala vê kaînata mezin tim û daîm mezin û fereh dike, çawa nivîserek kağeza xwe ditewîne, Ew jî

31 Celal Kırca, Kur'an-ı Kerîm'de Fen Bilimleri, s. 165; Neccâr, Semâ, s.82-93; Faruk Yılmaz, Kâinatın Yaratılışı, s. 64-67, 255-258.
32 Şakir Kocabaş, Kur'ân' da Yaratılış, İstanbul 2004, s. 19.
33 Prof. Dr. Osman Çakmak, Bir Çekirdekti Kâinat, s. 28.

dê wê bitewîne û dawîyê li wê bîne. Çawa Heq Teala dibêje: **"Ew roja ku emê, asîmên bipêçin her wekî pêçandina rûpelên kitêban, her wekî çaxê ku cara pêşîn me dest bi aferandinê kiribû, emê dîsa wê vegerînin. Ev peymaneke wisan e, me hilgirtiye ser xwe. Hemin emê peymana xwe bînin cih."**[34]

Roja qîyametê rewşa vê kaînatê diguhere. Lewra Heq Teala dibêje: **"Wê roja ku erd bi erdeke din û asîman bi hinek asîmanên din bêne guherandin û ew derkevin pêşberê Ellahê yek û desthilatdar."**[35]

Ev jî nîşan dide ku alemeke din dê were aferandin û jîyaneke din dê destpê bike.[36]

### Her Heft Qat Asîman

Heq Teala di ayetên pîroz de behsa heft qat asîmanan dike. Berîya niha, ew asîmanê ku me behsa wî kirî, asîmanê yekê ye, yan jî asîmanê dinyayê ye. Herçî asîmanên din in, vêca ji însan re çawa mûmkin dibe ku eqlê wî ji wan bigre, yan jî ew di wan bigihe?!

Heq Teala wiha dibêje:

**"Her ew e, yê ku heft tebeq asîman bi hev re ahengsaz aferandine. Tu, di aferandina Rehman de**

34 Enbiya, 21/104.
35 Îbrahîm, 14/48.
36 Binêrin; en-Neccâr, es-Sema, s. 82, 105-106, 187-194; http: //www. Biltek.tubitak.gov.tr, Evren/Evrenin Kaderi/Kapalı Evren.

**ti nakokiyê nebînî. Çavê xwe vegerîne û binêre, ma tu, derz û kêmasiyekê dibînî? Piştre du caran çavê xwe vegerîne û meyzîne, çavê te, ji ber kêmasiya ku lê geriyaye û nedîtiye dê reben û westiyayî li te vegere! Sond be ku me, asîmanê nêzîkî dinyayê bi stêreçirayan xemilandiye. Me ew stêreçira, ji bo şeytanan kirine kevirbaran û me ji wan re ezabê agirê bi pêt jî amade kiriye.”**[37]

Vêga serê xwe rake û bi çavê îbretgirtinê li asîmanî binêre! Kêlîkekê cismên asîmanî yên ku nayên hijmartin û saniyekê jî şaş nabin û di nav nîzameke mezin de digerin, tefekkur bike! Tev jî gellek sirr û hikmetan hildigrin.

Heke dinya li hawîrdora xwe negeraba, her dem beşek jê dê tarî û beşek jê jî dê rohnî bûya. Ew çax, ji hev veqetandina wextê kar ji wextê îstîrahetê mûmkin nedibû.

Dîsa gera dinyayê li hawîrdora xwe di muddeta 24 saetan de têde gellek sirr û hikmet hene. Lewra heke muddetê gera dinyayê ji 24 saetan dirêjtir bûya, hingê dinya jî dê wekî kewkeba Merkurê bibûya ku ferqa pileya germê di navbera şeva wê û naveroja wê de digihîje 1000 dereceyan. Di naveroja wê ya dirêj de germahîya wê zêdetir dibû û her cih germtir dibû; di şevên dirêjên wê de jî sermaya wê dijwartir dibû û her cih dibû qeşa.

37 Mulk, 67/3-5.

Her wiha di siha van heqîqetan de, binêre Xuda Teala çawa kiriye ku şev naverojê dinixumîne? Çawa şev kiriye ji bo îstîraheta xewê û naveroj jî kiriye wesîle û navgîn ji bo jîyan û gera li abûrîyê? Di tecellîyatên qudret û rehma îlahî de tefekkur bike; her yek ji şev û naverojê li peyhev diçin û tên û di wan de hîş şaşbûn jî çênabe!

Her wiha heke dinya li dora rojê negerîyaba; heke di wê gerê de jî pileya meyla erdê 23 pile û 27 deqîqe xwehr nesekinîyaba; hingê demsalên havîn, zivistan, bihar û payizê çênedibûn. Heke meyleke wiha bi dinyayê nehatiba dayîn jî, hingê buxarên ku bi ser okyanûsan dikevin radibin dê bi rexên başûr û bakur ve biçûna û parzemîn jî dê bibûna perçeyek ji qeşayê.

Dîsa heke mesafeya ku vêga di navbera dinya û heyvê de heye, nebûya; ew mesafeya ku tam digihîje 50 hezar mîlan û ew ji vî miqdarî zêdetir bibûya. Hingê li sererdê med û cezîr [rabûn û daketina pêlên ava behran] dê ewqas dehşetdar bibûna ku hemû parzemîn her roj dê du caran di bin avê de bimana. Heta çîya jî di midedekî kurt de dê hêdî hêdî bihelîyana û ji holê rabûna biçûna.[38]

Naxwe, de li mezinbûna vê kaînatê û pirrbûna stêrên wê binêre çawa Heq Teala ew aferandine, ew tenzîm û birêkûpêk kirine! Û tefekkur bike wî çawa

38 Binêrin; li kitêba bi navê İlim-Ahlak-İman, berhevkar: M. Rahmi Balaban, Diyanet Yayınları, Ankara, sf. 187.

kiriye ku ev stêr û cismên zehf nehîtî bê hilawistok û bê sitûnên ku bi çavan werin dîtin, xwe bi asîmanî ve digrin, jê nakevin û radiwestin?!

Tefekkur bike, gelo hîç di tav û heyvê de arizekek û xirabbûnek çêdibe? Gelo ew diçin tamîrxaneyeke wekî tamîrxaneyên beşeran? Gelo ev qas heyberên asîmanî, rojekê ji rojan ji wan rêgehên ku Xuda Teala ji wan re dîyar kirine û ew têde sobaberî dikin û dewam dikin, hîç ji plan û programa îlahî derdikevin û rûdaneke trafîkê dikin?

### Terka Tefekkurê Gunehekî Mezin e

Rewşa însan bi sosret e, dema ew qesr û sarayeke nexşandî û mûzeyyen bibîne, jê re heyran dimîne. Ew hîç ji bîra wî naçe û di dirêjahîya jîyana xwe de her behsa sipehîbûna wê dike. Lêbelê digel ku ew her tim vê kaînata mezin dibîne; ewa ku mûcîzekeke îlahî û hunereke xarîqûlade ye; dîsa ew bi awayekî layiq û şayeste di hûr-hikmetên wê de tefekkur nake û behsa wê nake. Her wekî ku tişteke normal be, li serê ranaweste û jê derbas dibe. Ew jî her wekî zinarekî ye ku ji tavî-baranên biharê yên ku di ser wî de diherikin û dikişin para xwe hîç nagire... Hal-hal e, ew qesra miroka ku ew jê re heyran dimîne, bes zerreyeke biçûçik ji vê dinyayê ye ku ew jî perçekekî biçûk ji cismên vê kaînata mezin e...

Ew mirovê ku ji tefekkurkirina qudreta Xuda Teala ğafil be, nimûna wî dişibihe vê rewşa mîroyê:

Mîroyek, di qesreke dîwar-bilind, hîm-sağlem, bi sipehîtirîn tiştan hatî xemilandin û bi ğulam û xizmetkaran mişt û tije ya padîşahekî de kuna xwe çêdike. Dema ew ji kuna xwe derdikeve û li hevalên xwe rast tê, ji wan re tenê behsa kuna xwe, xureka xwe û depokirina wan vedibêje. Lêbelê ew ji tefekkurkirina qesra ku ew têde ye, hêz, qewet, îhtîşam û desthilatîya padîşahê ku ew daye çêkirin jî zehf dûr e. Ji ber ku mîro ji vê qesrê ğafil û bêxeber e, her wiha ew ji mirovên ku têde dijîn jî ğafil û bêxeber e.

Mirovê ğafil jî, ji hunerê xarîqûladeyê Xuda Teala, melaîket û evdên wî yên xas yên ku di milkê wî de dijîn jî ğafil û bêxeber e.

Mîro, nikare wê qesra ku têde dijî û sipehîtîyên ku têde hene jî, nas bike. Lêbelê însan dikare bi tefekkur û xeyalkirina xwe, li gellek aleman bigere û di xarîqûladeyên hunerê Xuda Teala jî bigihe. Însan bi xêra ewqas nîmet û îhsanên bêjimar ên ku Xuda Teala jê re bexş kirine, dikare netitiştî û nekarîna xwe fehm bike û ji nîmetbexşê xwe re sicûda şikrê bike. Ev jî bes yê ku "însan" be, dikare bike. Yan jî bi tebîr û vegotineke din, ewên ku dikarin vê bikin, gihane şeref û heysîyeta însanîyetê. Lewra însan, bi xulqîyeta xwe têde vebohtî û qabilîyeta tefekkurê heye. Heke însan qabilîyet û amadekarîya xwe ya tefekkurê terk

bike, bêşiwar ewê bimevirin. Bi vî awayî, xîyanet li wan sipare û emanetên îlahî kiriye û xatir ji giringtirîn wesfên însanîyetê xwestine.

Dostê Heq Teala **Mewlana Celaleddînê Rûmî** rewşa ğafilan; ewên ku bi dilên sitûr û hişk li vê dinyaya ku komkara sirr û hikmetên bêjimar û bêdawî ye dijîn û peyamên îlahî yên ku di mexlûqatên wî de hene, bi çehreyeke rûtirş û sar temaşe dikin, bi vê teşbîhê îfade dike:

"Rojekê gayek tê bajarê Beğdayê. Beğda di wê serdema xwe de merkez û navenda şehristanî û zanînê bû. Ew ji vî serê bajêr heta bi wî serê din lê digere. Lêbelê ew tiştekê ji sipehîtahî û hunerên wê yên xarîqûlade nabîne. Lê qaşûlên gundor û şebeşên li kenarê rê tenê bala wî dikişînin. Ji xwe tişta layiqî ga û kerê, ev bû ku ew ka-ya li kenarên rê rijîyayî û çîmen û giyayên li ser kevîya rê şîn bûbûn, bibîne!"[39]

Li gorî di eseran de hatiye; di serdema Mûsa [sxl] de zilamek hebû, sih salan îbadet kiribû. Ewrekî li ser wî dikir sih û sêwan û ew ji tavê diparast. Lê rojekê ewr nehat, ew abid jî li ber tavê ma. Çi dema wî sebebê vê ji dêya xwe pirs kir; çima ew nehat? Jê re got:

"- Ez dibê hema te gunehek kiriye." Çi dema wî jê re got;

39 Mesnewî, c, 4, beyt: 2377-2379.

"- Na, min guneh nekiriye!" Dêya wî jê re got:

"- Ma te li asîmanî û li çîçekan nemeyzand? Ma çi dema te ew dîtin, tu ji tefekkur-kirina mezinatîya Heq Teala ğafil bûyî?"

Wî mêrxasî got;

"- Erê, min sipehîtîyên xarîqûlade yên derdora xwe dîtin; lê min di tefekkurê de qusûr kiriye, dêya wî jê re got:

"- Ma gunehekî ji vê mezintir heye? Di cih de tobe bike!

Ji ber vê sedemê, bawermendekî ku eqlê wî li serê wî be, divê ti caran wezîfa xwe ya tefekkurê hîç îhmal neke.

Însan, çi qeder xarîqûladeyên di hunerê Xuda de zehf hîn bibe û çi qeder li ser wan tefekkur bike, ewqas ew di bara bilindî, mezinatî û naskirina wî de yanî ewqas nêzîkbûna wî ji bo Heq Teala de zêde dibe!

**Hezretê 'Elî** (Xuda jê razî be) dibêje:

"Heke mirovekî ku Qur'anê dizane, hinek tiştan ji îlmên stêran [astronomîyê] jî hîn bibe, bi xêra vê îman û yeqînîya wî zêde dibe." Paşê jî wî ev ayet xwend:

**"Bêguman di peyapey hatina şev û rojê de û di mexlûqên ku Xuda ew li erd û asîmanan aferandine de, ji bo qewmekî ku xwe biparêzin, nîşan hene."**[40]

40 Yûnus, 10/6.

Her mexlûq û heybera ku Heq Teala ew aferandiye, di nav nîzama îlahî de wezîfe û erkeke pêzan û malûm bicih tîne. Însan, heta îro kariye tişteke hindik ji hemû xizmetên nîmetên bêjimarên ku Xuda jê re bexş kirine, fehm bike. Ew hikmet û xizmetên ku wî nedîtine û fehm nekirine, ji yên ku wî fehm kirine, qat bi qat zêdetir in.

Heke em deng zanibin, ji ber ku me cîhazekî wekî guh yê deng-standinê heye. Heke em reng zanibin, ew bi xêra çavên me ye. Kî zane dibe ku di vê alema bêdawî ya mexlûqat û heyberan de pirr tecellîyatên îlahî yên din jî hebin ku di bara wan de ti malûmatên me nîn in, lewra me ew cîhazên ku wan zanibin, nîn in[41].

Ew însanê ku tam di xusûsîyet û taybetmendîyên mexlûqatan nagihe û eqlê wî jî sînordar e, vêca ewê çawa karibe Heq Teala yê ku temamê kaînatê aferandiye tam îdrak bike? Ew alimên Îslamê yên ku karîne piçekî mezinatî û hinek tecellîyatên sifetên wî îdrak bikin, di nav şaşbûn û heyrî-mayîna xwe de gotine;

41 Li gorî alimên Îslamê, kaînat, ji **“Erez û cewheran”** pêktê. **Cewher,** heyberên maddî ne. Erez jî ew tiştin ku têgihiştina wan bi hebûneke maddî pêkan e. Wek nimûne; reng, yan jî bêhn, her yek ji wan erez in. Têgihiştina wan bes bi rêya hebûneke maddî pêkan e. Wekî li jorê hate gotin; heke çav nebûya reng, bêhvil jî nebûya bêhn nedihat fehmkirin û îdrak-kirin. Li axretê, ji ber ku emê bi wesifine din dest bi jîyanekê bikin, pêkan e mirov hinek heyberên din îdrak bike ku ji wan re jî mahîyeta erezan hebe ku ne pêkan bû em li dinyayê di wan bigihin. Her wiha dibe ku hinek erezên din hebin ku me nikarîbû wan îdrak bikin, lewra li dinyayê me ew cîhazên pêwîst nebûn ku em wan pêşwazî bikin û wan erezan nas bikin.

**"fehmkirina wî, ev e mirov fehm bike ku ew nayê îdrak kirin."**

Lewra di heyberên ku hatine xuliqandin de ji zatê Xuda Teala ti înîkas, pertew û tecellîyek nîn e. Her tişta ku Heq Teala ew xuliqandiye, bi terkîba tecellîyatên sifetê îlahî çêbûye. Xuda Teala mekanek nexuliqandiye ku karibe tecellîyata zatê îlahî li ser xwe hilgire. Çi dema Mûsa [sxl] bi israr xwest Xuda Teala bibîne, ev bersiv jê re hate dayîn: **"Çi dema Mûsa ji bo civanê me hat û Xudayê wî pê re peyivî, wî got: Xudayê min! Xwe nîşanî min bide; ez li te binêrim! Jê re got: Bi rastî tu dê hîç min nebînî. Lêbelê li çiyayî binêre, vêca heke ew li cihê xwe sekinî ma; hingê dibe ku tu min bibînî! Çi dema Xudayê wî ji çiyayî re diyarbû, êdî çiya bû perçe perçe û bi erdê re rast bû. Mûsa jî bêhiş ket erdê û hay jixwe nema. Çi dema bi hişê xwe ve hat, got: Ez te ji hemû kêmasiyan pak didêrim, min li ber te tobe kir û ez pêşiyê bawermendan im."**[42]

Bi vê axaftinê û jixweçûna Mûsa sabit e ku însan nikare zatê îlahî îdrak bike.

Ji ber vê sedemê însan, bêçare ye, nikare heqîqeta sifetên wî bi awayekî mûkemmel îdrak bike, vêca tu ji îdrak-kirina heqîqeta zatê wî bi xwe neke behs!

**Necîb Fazilê** rehmetî çi xweş dibêje:

42 Eraf, 7/143.

Di atoman de coş û xuroş, rewş û dilşadî heye;

Li hawîra wan ronahî heye, ronahî wan dinix-umîne;

Di nav hev de avasazî, di nav hev de xwebûn heye;

Min tu naskirî ey Xudayê m, ey meşhûrê nedîtî, nebînayî!

## ATMOSFER

### Berga Hewayê

Di valahîya hewaya ku dinyayê diniximîne de jî gellek sirr, raz û hikmet hene: Ew ewrên ku têde soba-berî dikin. Ew bayên ku carina dijwar, carina jî hêdîka tên. Ew gurmîna ku em wê dibihîzin û birûskên ku em wan dibînin. Ew barana ku dibare û ew berfa ku dibare… Ev tev, tecellîyatên xarîqûlade ne, ku bi endaz û hesab tehqîq dibin.

Qur'ana pîroz, însan ji bo tefekkur-kirina di van tecellîyatên di navbera erd û asîmanan de gazî dike. Ew însan gazî dîtina delîlên qudreta îlahî dike, ewên ku di wan de hene.

Ayeta pîroz wiha dibêje: **"Bi rastî di xuliqandina erd û asîmanan de, di peyapey hatina kurtî û dirêjiya şev û rojê de, di keştiya ku tiştan ji bo feyda însanan di deryayê re dibe, diçe û tê de û di barana ku Ellah wê ji ewrên asîmanî dibarîne û bi wê erda ku berê ji**

**bê-avî hişk bûyî bi hêşînahiyê vedijîne de û di her cureyên jîndaran de ku li rûyê erdê belav kiriye û di tevgera ba û ewrên fermanber yên di navbera erd û asîman de.. Helbet ji bo qewmekî bîrewer gellek delîl hene..”**[43]

Atmosfera ku bi şefqet dinyaya me hemêz dike, ew yek ji tekûztirîn sîsteman e ku rehma bêdawîya Heq Teala li evdên wî, nîşan dide. Atmosfer, kêm-zêde ji tevlîhevbûna ji %77 azot, ji %21 oksîjen û bi rêjeya ji %1 ji karbondîoksît û ğazên din yên wekî argonê çêdibe. Oksîjen taybetmendîya wê ev e; ewqas zehf hêsan pêdikeve. Heke ji vê rêjeyê ji %1 were zêde kirin, hingê bi rêya ji %70 îhtîmale agirpêketina daristan-an ya di encama birûskekê de zêde dibe. Rêjeyeke oksîjenê ya ji %25 zêdetir, mena wê ev e; ev xurekên giyayî yên ku em dixwin, dê pirranîya wan bişewitin û bibin xwelî.

Ji rexê din ve, digel ku oksîjen û karbondîoksît tim tên bikaranîn jî, lê dîsa rêjeya wan ya di hewayê de tê mûhafezekirin û parastin. Heke li dinyayê însan û heywan tenê hebûna, wan dê oksîjena di xwezayê de tev bikarbianîna û ew bikirana karbondîoksît, ew çağ piştî midedekî oksîjen dê kêm bibûna û karbondîoksît jî dê zêde bibûna. Hingê ewê bi jehrê biketana û bimirana. Lêbelê ew şîyan û qudreta ku ev alem anîy wicûdê, wî

43 Beqere, 2/164.

giya jî aferandine, ji bo wan jî ew qabilîyet bexş kiriye û daye ku pê bikarin karbondîoksîtê bikarbînin û wê jî bixin oksîjen. Bi vî awayî, di alemê de hevkêşîyeke bi îhtîşam û zindîtîyeke mûezzem û berdewam anîye holê.

Her wiha sitûrbûna qaşûla sererdê jî bi endazeke ewqas hessas hatiye dîyarkirin ku heke ew piçeke din sitûr bûya, wê dê bi karbondîoksîtê oksîjen bimêhta û hingê giya jî çênedibû[44].

Her wext û an pêdivîya bi mîlyaran karên bîyokîmyewîyên ku di wicûda me de tehqîq dibin jî bi oksîjenê heye. Em tim û daîm hewayê dikişînin cîger û kezebên xwe û em wê hewayê careke din jî bi şûn de didin. Hebûna rêjeya oksîjenê di atmosferê de bi tîrbûneke ewqas têr û tije ku ji bo teneffusê mûnasib e, ev nîşan dide ku rasthatin û tesaduf nikare tevlî vê tedbîrê bibe. Xudayê me, wicûda [bedena] me bi awayê ku ji oksîjenê re hewcedar be, aferandiye. Wî nîmetên xwe gelek gelek ji me re bexş kirine. Hem jî wî ew nîmetên xwe bi rêjeyeke mûnasib xistine nav hewayê ku em karibin bi awayekî bigihin wan û bi hêsanî wan teneffus bikin. Ji lewma her nefesek û hilmeke ku em didin û distînin jî di eslê xwe de nîmeteke îlahî ya bi îbret û mezin e.

Dema em li firokeke ku bi teknolojîyeke çêtirîn û nûjentirîn hatî çêkirin, siwar dibin, em şîyarîyeke wiha

44 Binêre; İlim-Ahlak-İman, berhevkar: M. Rahmi Balaban, sf. 187.

dibihîzin: "Dema fîşar di bilindahîyên bala de nizm bibe, maskeyên oksîjenê yên ku bi otomatîkî tên pêşîya we, bidin ber devê xwe!"

Hal-hal e kes pêxav nake û nabêje; "Gelo dibe ku sibê miqdarê oksîjenê li hewayê derkeve ji %21'ê, yan ji %25'an, yan jî gelo ewê dakeve ji %18'an, gelo ez ji bo xwe tupekî oksîjenê bikirrim?" Lewra her kes çi bawer bike, çi jî bawer neke, li nîzama îlahî îtîmad dike û jîyana xwe berdewam dike. Berevajîyê vê, heke însan ji metirsî û xetera jîyanî ya ku li pêşîya wî ye, heydar bûye, jîyan dê li wî bibûya jehr û kerrafî.

Li rexê din jî hewa, wekî eynekekê ye, ew hawîrdorên me rohnî dike. Ronahî, heta li maddê nekeve, rohnî nade. Ronahîya ku perçeyên biçûçik dikeve, wekî fişekên hewayî dipijiqin, dibin germahî û ronahî û li hawîrdoran belav dibin. Herçî valahîya fezayê ya li derveyî atmosferê ye, ew tarî ye, digel ku ronahî ji taverojê tê jî. Sedemê wê jî ev e; nebûna cureyên molekul û atoman e.

Wek nimûne; Ronahî li ser heyvê nîn e. Sedemê wê ji wê re nebûna atmosferê ye. Tebeqekeke ğazê li wir nîn e ku ronahîya ji taverojê tê belav bike û pê hawîrdoran rohnî bike. Ji lewma bin heyvê rohnî ye; lê piçekî ji wê jortir, digel ku tim di bin barîna ronahîyan de ye jî, dîsa tarî ye.

Ev tecellîyatên xarîqûlade, delîlên eşkere ne, xuya dikin ku dinya, li gorî şert û mercên taybet û xusûsî û

bi armanc û meqsûdeke mûhîm hatiye xuliqandin ku jîyana însan li ser wê mûmkin be. Dîsa ev hevkêşîyên nazik û hessas yên ku jîyanê mûmkin dikin, digel ku lutf û qencîyên mezin yên Heq Teala ne, ji bo evdên wî jî, ew delîlên hebûna wî û şîyan û qudreta wî ya bêsînor û bêdawîn in. Her mexlûq û heyber li kaînatê di nav bername û programekî îlahî de hereket dike. Bi plan, bi hesab û bi nîzambûna her tiştî; qebûlkirina hebûna qudret û şîyaneke plandaner, rêxer û hesabkar dike zerûrîyet.

Ji lewma ev îddîa û gotina ateîstan: "Heyat û kaînat ji ber xwe ve, bi tesadufî hatine meydanê." sefseteyeke pêkenok û bê esas e.

**Îsmaîl Fennî Ertûğrûl** [1855-1946] vê heqîqetê bi vê mîsalê îzah dike:

"... Heke li cihekî hesab û rêkûpêkî were dîtin, eql bi qet'î vî hukmî dike; li wir hesabkar û rêxer heye ..."

Em ferz bikin; bexçekekî we heye. We jî li hawîrdora wî bi rêzeke mûeyyen şitl çandine. Hûn rojekê çûne wir, we dît ku wa ye, hinek ji wan şitlan bi pêş ve qulibîne û hinek ji wan jî bi paş ve wergerîyane, qulibîne. Dema we sedemê vê pirs kir, bexçevan ji we re got; bahozeke dijwar rabû, wî ew qulibandin. Hûn vê bersivê qebûl dikin. Lêbelê dema hûn rojeke din jî biçin, hûn bibînin ku wa ye, şitla çaran li cihê xwe ye, lêbelê şitla pêncan ketiye erdê, dîsa ya çarê hatiye hiştin lê ya pêncan hatiye qulibandin û werge-

randin, dema hûn sedemê vê dipirsin; çima wiha bûye? Bexçevan dîsa heman bersivê bide te. Tu dê vê bersivê bawer bikî? Bêşiwar hûnê vê bawer nekin û hûnê bibêjin, evê ku vê dibêje, mirovekî nîyet-xirab e. Lewra heke tu karibî bûyera pêşî bixî stûyê tesaduf û rasthatinê jî; lê tu nikarî vê bûyera duduyan bixî stûyê tesadufê. Lewra di vê cara duduyan de hesab ketiye nav îş û kar.[45]

Ti mirovê ku eqlê wî li serê wî be û karibe tefekkur bike, nikare înkar bike ku kaînat, hebûna xwe di nav hesabên bêdawî û hevkêşîyên nazik û hessas de berdewam dike.

Ha ji te re çend hevkêşîyên îlahî yên din:

### Fîşar û çewsandina Hewayê

Ew ğazên ku berga hewayê/atmosferê pêktînin, kêm-zêde li meydana 1 $cm^2$ bi hêza 1 kg fîşar û zextê tetbîq dike. Yanî wicûda [bedena] însan di bin 15 ton giranî de ye. Heq Teala ev hevkêşî bi ahengeke mûezzem li hev ragirtiye. Li derve, fîşara hewayê çi qeder be, ji hundurê me jî ber bi derve ve ew qeder fîşar heye. Dema fîşara hewayê dikeve, ew dibe sebebê nerehetî û xwîn-hatin ji bêhvila mirovên ku bi jorê ve hildigerin, sebebê wê jî ev ferqa di navbera

45 Li pirtûka bi navê "Îman Hakîkatleri Etrafinda Suallere Cevapler, sf, 21-22, Sebil Yayinlari, Îstanbul, 1978.

herdu fîşaran de ye. Astronotên ku derdikevin derveyî atmosferê, hinek cilên taybetî li xwe dikin, fîşara hewayê di nav wan de heye, ew bes bi wan tenê dikarin li fezayê bigerin.

### Aheng û hevkêşîya Serma û Germê

Molekulên [zerreyên] buxara avê û karbondîoksîtên belavbûyî yên ku bi awayekî têr û tije di hewayê de hene, hevkêşî û ahengeke mûezzem û dehşetdar bi taqeta germîya bilind re çêdike. Ev molekul, beşeke mezin ji ronahîya ku bi roj ji tavê tên, dimije; ji bo nehêle ku bi awayekî zehf zêde pileya germê di naverojê de bilind bibe. Dema wext dibe bi şev, roj diçe ava û ronahî qut dibe, hingê ew germîya ku molekulan mêhtine, di germxaneyên giyayan de diparêze û wan di valahîya fezaya sar de jidest nade. Wek nimûne; heyv ji berku ji banekî wiha pasevan mehrûm e, bi roj ew ji germa dikele, lê bi şev jî ji serma dicemide.

### Ba

Atmosfer/berga hewayê li gorî pileya germê, fîşar, miqdarê hêwîbûn û bûyerên ku di navê de rûdidin, li tebeqeyên curecur tê dabeşkirin. Tebeqa yekê, di berga hewayê de **Troposfer** e. Bûyerên wekî baran, berf û bayê di vir de rûdidin û çêdibin. Ev tebeqe, 16 km ji banê erdê dûr e. Her ku diçe pileya germê kêm

dibe heta bi -56⁰ c ê dikeve. Di vê tebeqa hewayê de sîstemeke dewra-daîma hevtemamker hatiye tesîskirin û damezirandin.

Bi sedem meyl û xwehrbûna eksena erdê, tîrêjên tavê bes tîk nayê devera ekvatorê [xeta îstîwayê]. Bi vî awayî, germî li deverên tropîkal [têr-germ] belav dibe. Li van deveran, di encama zehf germbûna hewa û sererdê de germî têr û tije tê depokirin. Ha depokirina vê germê jî mena wê ev e; çi qeder hêz û enerjî ji bo bayê lazim be, dabînkirin û temînkirina ew qeder hêz û enerjîyêye.

Bi hezaran ton ava ku ji behran dibe buxar, li pişta tenika hewayê siwar dibe. Ba wê avê kom dike, dide pêşîya xwe û ji bo wan zevîyên ku îhtiyaca wan pê hebe, diguhêze. Di encama vê dewra daîm de, di şûna ku hinek dever tim ziwa bin û hinek dever jî tim şilî bin, di çarçova usûl û planeke tekûz de her dever digihîje av û rehmê.

Guhastina germahîyê di encam û netîceya gera atmosferê ya li gorî planeke tekûz de çêdibe. Hewa sar ji çemberên bakurî peya dibin tên çemberên nizmtir, hewa germ jî hildigere çemberên bilind ên li başûr. Ev guhastin bi sedem tevgerên sîstemên hewayî yên nizm û bilind ên li terefên bakur û başûr çêdibe. Her wiha ew bi arîkarîya herk û şepêlên xurt ên bayê yên di asta bilind de jî çêdibe.

Her wiha tav, bi dijwarî û pileyên cuda cuda germahîyê dide ser rüyê erdê. Ev jî rê vedike, ji bo girseyên hewaya di atmosferê de germtir bibin. Hewaya germ hildigere jorê, paşê dîsa hewaya sar tê şûna wê. Her wiha li sererdê, hebûna hewaya nizm li cihên ku têde hewaya germ heye û hebûna fîşara nizm li cihên ku hewaya sar têde heye, jêderên hewaya lebatok pêktînin, ewên ku ji wan re **"Navendên Hewayê"** tê gotin. Di dawîyê de zerreyên biçûkên hewayê, destpê dikin, dibin agir û tevdigerin. Di nav van bayan de guhastina hêwîbûn, germbûn, tîrbûn û enerjîya di atmosferê de çêdibe û guhastina lipên fetrîmkirinê ji bo cihên ku îhtiyaca wan pê heye, çêdibe, ewên ku ji bo şînbûna giyayan dibin arîkar.

Heq Teala di vê mijarê de wiha dibêje: **"Me, bayên ewrhilgir û avisker hinartine. Vêca me, ji ewran avek aniye xwarê û me bi wê, hûn av dane. Hal ev e ku we nikarîbû wê bipengîne."**[46]

Ba jî wekî hemû mexlûqat û heyberên ku li kaînatê hene, bi îtaeteke mûtleq xwe ji hukmranîya Heq Teala re stûxwehr dike. Dema Xuda Teala bixwaze, ba ji bo însan dibe wesîle û navgîna rehmê. Dema Xudayê me bixwaze jî, ba dibe hêrseke helakdar û kambaxker.

46 Hicr, 15/22.

Ev ayeta li jêrê nimûneyeke eşkere ye, vê heqîqetê îfade dike û dide zanîn ku Xuda Teala qewmê ‘Ad bi bayê biriye helakê.

Heq Teala dibêje: **“Me. Bayekî sar û bi vîze vîz di rojeke bêqudoşiya wê seraqetî de bi ser wan şand. Wî bayî, mirov digirtin, ji cihên wan hildikirin û diavêtin her wekî ku ew qurmê darxurmê bin, ji rayên xwe hatibin hilkirin û avêtin.”**[47]

**Feydên Dîtir Yên Hewayê**

Hewa, çawa li ser milên xwe yên tenik bi tonan avê hildigre, ew bi sedan firokên kesan jî hildigrin. Ew ronahî û germahîyê belav dike. Ew dengan bi sedan pêlên cuda cuda tîne guhên me ku di serdema me de telefonên destan ji bo vê nimûnekeke zehf balkêş e.

Li alîyê din hewa, bêhnên curecur bêtevlîhevkirin tîne ber poz û bêhvilên me. Heke atmosfer nebûna, me dê nikarîba dengên dostên xwe yên li kêleka xwe rûniştî jî bibihîsta û me dê nikarîba ronahîyê pêxista û emê rohnî jî nebûna. Her wiha hewa, di kezebên me û rayên me de digere, bi vî awayî erk û wezîfekeke jîyanî bicih tîne. Bi vî awayî, ew xuyahî û tecellîyatên ezemet, qudret û merhemeta bêsînor û bêdawîya Heq Teala ji bo mûmînê ehlê tefekkurê di bîr tîne.

47 Qemer, 54/19-20.

## Fîltreya/Parzûnka Îlahî

Tebeqa ku piştî Troposferê tê Stratosfer e. Ew ji ser rûyê erdê 50 kmetreyan bilind e. Ev tebeqe nahêle enerjîya bilind û tîtêjên bi tehlûke werin dinyayê û di vê tebeqê de dîsa germahî bilind dibe. Tebeqa Ozon jî di vê tebeqê de ye. Ozon molekuleke sê atomî ya oksîjenê ye. Ozon zirarên tîrêjên tavê paqij dike û li parzûnk dixe.

Tîrêjên ûltravîyole yên ku ji tavê tên, leza mezinbûna giyayan kêm dikin û di însanan de jî dibin sersebebê pençeşêra çerm, zirarê didin çavan û metirsîya ketina bi nexweşîyên êşengîz zêde dikin. Ha tebeqa Stratosferê tîrêjên ûltravîyoleyê digre, pertewa wan dide paş û bi reaksîyona [berteka] hevkêşîyeke kîmyewî ya xarîqûlade oksîjenê dixe ozon.

Ozon di eslê xwe de ğazeke zehf xeternak e. Bêhnkirina yekê ji du sedên gramekê jî, dikare însan bikuje. De li rehm û hikmeta Heq Teala binêrin, çawa wî tebeqekeke evqas bijehr, kiriye parzûnkeke îlahî ji bo parastina hevkêşîya av û hewayê û ji bo rê-girtina li ber zirara xetereke zehf tirsnaka jîyanî ya ku gefan li însan dixwe.

## Banê Parastî

Tebeqa **“Mezosfer”**ê ji bo atmosferê tebeqa navîn tê jimartin. Ew ji berga hewayê [atmosferê] re heta bi

80 kmetreyan dirêj dibe. Ev tebeqe, li dijî lehîyên kevirên asîmanî wezîfa mertal bicih tîne.

Kevirên asîmanî yên ku astengên hormiz [jupîter], keywan [saturn] û heyvê derbas dikin, bi surdarî û kêşana erdêbi lezûbezeke dehşetdar tên atmosferê. Di vê bûyera ku em jê re "rijîna stêran" jî dibêjin de dema kevirên asîmanî bi hewayê re temas dikin û digihinê, ew dişewitin û di nav mezosferê de dibin toz. Heke li hawîrdora dinyayê tebeqekeke wiha pasevan nebûya, yan jî heke ew ji tebeqa ku heye teniktir bûya, wê bi mîlyonan kevirên asîmanî biketana ser erdê û wekî ku di heyvê de jî wisan e, wê her teref qul û pil bikirana û bişewitandana. Hal-hal e wek berhema rehma bêsînora Heq Teala, ev gulleyên ku ji asîmanî li serê me dibarin, hê negihatin erdê dibin toz û tine dibin. Paşê her yek ji van zerreyên tozê jî dibin tuxmê dilopeke biçûka baranê.

Lewra ji bo çêbûna ewrên li asîmanî divê zerreyên biçûk û hûr hebin, hîç ferq nake; çi jêdera wan erd be, çi jî jêdera wan feza be. Hem jî lazim e ku ev zerreyên biçûçik jî bigihîjin atmosfera jorê. Her wiha ev zerreyên biçûçik bi bayê hêwî yê ku ew hilgirtin û anîn wir re dest bi tîrbûn û şikêrbûnê dikin û tuxm ji bo yekî ji wan ewran çêdibin. Ew tuxmên ewran jî li gorî plan-danîneke fîzîkî û matematîkî dibin dilopên biçûçik yên baranê û ev dilopên biçûçik yên avê destpê dikin û li erdê dikevin.

Berîya keşfbûna ti xusûsîyeteke atmosferê, Heq Teala, yê ku xwediyê erd û asîmanan e, wiha dibêje: **“Me, asîman kiriye wekî banekî sağlem û parastî. Lê ew jî berê xwe ji nîşanên asîmên vedigerînin.”**[48]

## Pêlên Radîyo

Mezosfer, navê wê tebeqê ye ku ji 500 heta bi 1000 kmetreyan bi jorê ve bandor û tesîra wê heye. Li vir, atom û molekul ne bêbar in, îyom bûye, yanî ew bi elektrîk-danê yan bi elektrîk-standinê bi elektrîkê hatiye barkirin. Di encama îyonbûna atoman de, bi sedem daqurpandina tîrêjên tavê yên xwediyê enerjîya bilind, germahî di vê tebeqê de pêkan e heta bi 2000⁰ C’yan jî derkeve. Tebeqa Îyonosferê wekî eynê ye ji bo atmosfera ku ji îyonan hatiye çêkirin. Ev eyne, pêlên elektromanyetîk ên ku ji erdê bi fezayê ve bilind dibin û pêlan didin bêtêl û radîyoyê li vê eynê dikevin. Hinek ji wan pertewa xwe didin û careke din li dinyayê vedigerin. Ew pêlên ku pertew didin, digihîjin her terefên dinyayê. Bi vî awayî, li her terefî taqîbkirin û şopandina weşana radîyo û bêtêlan mûmkin dibe.

Wekî ku xuya dibe, Heq Teala ev dinyaya ku di valahîya fezayeke tarî û sar de bilez sobaberî dike, bi germîyeke mûnasib kiriye hêlîneke şîn û tije heyat. Li sererdê av û hewayeke xweş û nermehewa heye. Heta

48 Enbîya, 21/32.

têde bawerzîneke biçûçik jî ne bêhikmet e. Heta pelek jî bêhesab û ji ber xwe ve, ji darê nakeve.

Her tiştê ku hatiye xuliqandin, ji yê biçûçiktirîn heta bigihîje yê mezintirîn, her yek ji wan keval û lewhekeke îbretê û xarîqûladeya hunerê îlahî nîşan dide.

Heq Teala wiha dibêje: **"Ma hûn nabînin ku Ellah, çi li erdê hebin û çi li asîmanan hebin, ji we re stûxwehr kirine û nîmetên xwe bi ferehî, hem yên eşkere, hem jî yên bi dizî ji we re temam û bexş kirine? Dîsa jî, ji navbera mirovan hinek hene ku di bara Ellah de bê zanîn, bêrêber û bêyî ku ji wan re kitêbeke ronahîker hebe, dikoşin!"**[49]

Xwezîya me bi wî be ku rêzenivîsên kitêba tije hikmet û ji heqîqetan barkirî ya kaînatê bixwîne, raz û îbretên wê fehm bike û di asoyên tefekkurê de jî hûr û kûr biçe![50]

### Ewr, Baran û Berf

Di ewran de tefekkur bike! Behrên nehîtî di hewayê de sobaberî dikin. Erk û wezîfekeke ewran jî ev e ku nehêlin zêde zêde dinya germ bibe. Dema germahî zêde bibe, av jî zêdetir dibin buxar, û ewr

49 Li suretê Casîye, 13, binêrin. [Luqman, 31/20]

50 Binêrin, Prof. Dr. Osman Çakmak, Bir Çekirdekti Kâinat, Îstanbul 2005, s. 118-131.

zehftir çêdibin. Tîrêjên ku ji taverojên tên, ji terefê van ewran ve wekî eynê ji paş ve tên nîşandan. Bi vî awayî, germahîya erdê bi hevkêş dimîne.

Heq Teala, dema bixwaze baranê bibarîne, ewran wek mizgînber dişîne. Paşê ev ba, ewrên wekî çîya li xwe bar dikin û bi fermana Xuda wan hildigrin û dibin cih û welatên ku bi birina wan deveran ferman li wan hatibe kirin. Xuda Teala li asîmanî çawa bixwaze, wisan ewran belav dike û wan berhev dike. Ew baranê ji navbera wan derdixe û pê fêkîyên curecur li erdê şîn dike. Ev rewş jî di bîra me tîne ku Heq Teala dê bi heman rê û rêbazê mirîyan jî dîsa sağ bike. Ew ji însan dixwaze ku ew ji vê keval û lewha îbretengîza mezin para xwe wergire.[51]

Xuda Teala ji nav evdên xwe kê bixwaze, rehma xwe li wî dibarîne. Bi taybetî jî ew mirovên ku li welatên çolîya ziwa dijîn, bi vê nîmetê di keyfxweşîyê de ğerq dibin. Bêhêvîbûna wan jî bi hêvîbûnê werdigere.[52] Lewra Heq Teala wiha dibêje: "**Her ew e, yê ku piştî hêviya mirovan ji hatina wê nema, baranê dibarîne û rehma xwe li her aliyî belav dike. Her ew e, dostê heqîqî û babetê pesndayînê.**"[53]

Xuda Teala hinek caran evdên xwe yên gunehkar bi navgîna hişkesalîyê, carinan jî bi navgîna baran û

51 Binêrin, ‘Eraf, 57; Fatir, 9.
52 Binêrin, Rûm, 48.
53 Şûra, 42/28.

teyrokê terbîye û ceza dike. Xuda Teala bi wan baran, hişkesalî û teyrokê kê bixwaze, ceza dike û ew kê bixwaze jî wan ji cezakirinê diparêze.[54]

Yanî Xudayê me, dema bixwaze mûnasebetên erd û asîmanî li gorî tevgerên mirovan û alemên dilên wan saz dike.

Xuda Teala baranê dilop bi dilop dişîne ku dilopek jê nagihîje dilopa din û pê re nabe yek. Ji bo her dilopê rêyek hatiye xîşk kirin, ew têde diçe û hîç jê cuda nabe. Ew dilop ne dereng tê, ne jî dilopa li pey wê lezê dike. Heke temamê însan û cinan ji bo çêkirina dilopek av bibin arîkar, yan jî ew bên cem hev ji bo dilopên ku li gundekî tenê dibarin bijimêrin, ewê nikaribin hesabê van bikin. Bes ew Xudayê ku ew dilop aferandine, hijmara wan dizane.

Digel vê jî, di lipên berfa ji ava şîrîn pêkhatî û di cemedê de hatî cemidandin û wekî pembûyê avêtî jî dibare de gellek tecellîyatên îlahî hene ku jimarina wan ne mûmkin e.

Gelo ew ava baran û berfa ku li erdê dikeve, kî wê derdixe jortirîn çiqilên daran? Wisan dibe ku av, li her terefên pelan belav dibe, lê ew nayê dîtin. Her zerreyeke darê bi navgîna mû-rayan xureka xwe ji wê werdigre.

54 Binêrin, Nûr, 43.

Gelo ew ava ku divê bi xwarê ve bikişe, çawa derdikeve jorê?[55]

Heke dilopên baranê li gorî qanûna erdkêşîyê peya bibûya, wê her dilopek bi leza fişeka ku ji lûla tifengê derketî li erdê biketa. Mana vê jî ev dibû; zindî dê di bin baranê de can bidin. Hal-hal e, li gorî usûlê, bê êşandin û bê perixandin, her dilopeke baranê, bi lezeke sabit li erdê dikeve...

Dilop, li gorî pîvanekê awayê xwe werdigrin û dibin dilopên biçûçikên baranê. Paşê hêza rakirina hewayê jî bi qasî bandora hêza erdkêşîyê dibe û dike ku peyabûna baranê li erdê, bi lezeke sabit çêdibe.

Her wiha ev heqîqet bi tenê jî ji bo mirovê ku bi çavê îbret-girtinê dinêre, têrê dike ku em mezinbûna vê nîzama îlahî û vê hevkêşîya hûr a ku Xuda Teala ew di vê kaînata ku em têde dijîn de danîye, nas bikin û em têbigihin ku zanîna Xudayê me, qudret û şîyana wî û hikmeta wî bêdawî ne.

## Tefekkur-kirina di Erdê de

Evdên teqwadar, xwe di tefekkurê de kûr dikin. Ew zimanê çîçekên ku bel dibin û vedibin, çûkên ku dixwînin û darên ku fêkî didin tevan dizanin û nas dikin. Ew ciwanî, nezaket û bedewbûna ku di wan de

55 Binêrin, Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 67-68.

heye, pertewa xwe dide jîyana wan ya rewanî û rûhanî jî. Ew mîna çîçekan rûh-nazik û wekî darên fêkîyan xwedî îkram dibin. Ha ev, ew mirovên bextiyar in ku Xuda Teala di Qur'ana pîroz de pesnê wan daye.

Heq Teala erd di awayê sipehîtirîn de raxistiye û ew ji bo jîyana mirovan bikêrhatî çêkiriye. Wî li serê rêyên fereh û rêbiwar çêkirine. Wî ew di rewşeke wisan bikêrhatî de aferandiye ku mirov karibin li serê birêve herin.

Xuda Teala ayetên pîroz de wiha dibêje:

**"Her ew e, yê ku erd ji we re raxistiye; kiriye doşek û asîman kiriye avahiyeke xurt û ji bo we ji ewran jî av aniye xwarê. Bi wê avê jî, ji we re fêkiyên curecur ji erdê deranîne. Naxwe digel ku hûn dizanin jî ti hevparan ji Ellah re çênekin ha!"**[56]

**"Hûn çawa înkara sağbûna piştî mirinê dikin? Ma me erd nekiriye wekî dergûşê raxistî ku însan û heywan lê dijîn û jê îstîfade dikin?; ma me çiya jî ji erdê re nekirine sing da ku nahêlin ew biheje?"**[57]

**"Her ew e, yê ku erd ji bo we sernerm û bikêrhatî çêkiriye. Naxwe li rê û aliyên erdê bigerin û ji rizqê Xuda bixwin. Vegera dawîn her bi bal wî ve ye."**[58]

56 Beqere, 2/22.
57 Nebe, 78/6-7.
58 Mulk, 67/15.

Xuda Teala di kitêba ezîza xwe de zehf behsa erdê kiriye ji bo însan li ser hikmetên erdê bi diqqet bifikrin. Sererd cihê sağan û binerd jî cihê mirîyan e.

Heq Teala wiha dibêje:

**“Ma me erd nekiriye cihê hewandin û kombûnê; ji bo mirî û zindiyan?!”**[59]

Bi diqqet li erdê binêre! Ew hişk û mirî ye, lê dema av li serê dibare, rûh pê tê û ew zindî dibe, hem geş dibe, hem jî şîn dibe û giyayên renga reng têde hêşîn dibin û ji hundurê wê zindîyên cuda cuda dertên. Paşê diqqet bike, çawa Heq Teala erd bi çîyayên nehîtî û mezin sağlem kiriye! Wî av di bin çîyayan de çawa depo kiriye? Wî, çawa kehnî dane verêhtin û li sererdê çem û dane kişandin û herikandin? Wî, çawa ji kevirên hişk û hola û axa şîlo ava zelal, şîrîn û paqij deranîye? Wî, bi wê avê çawa heyat daye her tiştî? Wî, bi wê avê dar û celebên giyayan, genim, tirî, nefel, zeytûn, qesb/ xurme, hinar û gellek meyweyên ku nayên hijmartin jî deranîne? Ev meywe hemû, awayên wan curecur e, rengên wan curecur e, çêja wan curecur e, sifet û bêhna wan curecur e. Di tevan de jî sipehîtiyeke cuda, çêj û temeke menewîş heye... Hinek ji wan xureka wan ji xureka yên din çêtir e. Haleveku ew tev bi yek avê tên avdan û ji axekê dertên.[60]

59 Murselat, 77/25-26.
60 Binêrin, Îmam Xezalî, Îhya, VI, 63 û yên din...

## Nebat û Giya

Dema tuxmek li ser erdê dikeve û rewaya axê bandorê lê dike, ew mezin û geş dibe û di encama vê geşbûnê de jî beşên jêr û jora wî tuxmî diqelişe. Ji beşa jora wî dara ku li ser axê radibe, derdikeve û ji beşa jêra wê jî kokên ku xwe bi binê axê ve berdidin, dirêj dibin. Ev tiştekî dehşetengîz e! Lewra xwezaya vî tuxmî tek e, tesîrên ku ji derve tên jî tek e, ji terefekî wî ve maddeyek bi hewayê ve bilind dibe, di terefê din de jî maddeyeke ku dikeve axê, derdikevin. Naxwe heke ji xwezayeke tenê du tiştên hevdij bizin, ev heyretbexş e! Em fehm dikin ku ev, bêşiwar bi îrade û îdareya aferînerê xwedî hikmet, çêdibe.

Piştre, ji vî tovî darek şîn dibe, qismek jê dibe êzing û qismek jê dibe pel û çilo. Qismek jî di serî de dibe çîçek û dikene, paşê jî ew dibe fêkî. Ji bilî vê jî, di vî fêkî de hinek madde tên meydanê ku ew ji bo wicûda [bedena] mirovên tebîet cuda cuda bihavil û bifeyde ne.

Dîsa di fêkîyekî tenê de taybetmendîyên curecur hene. Wek nimûne; tirî û sîsika wî sar û ziwa ye. Qismê bi goştê wî û ava wî jî germ û şil e. Digel ku ew li ber tesîran rûbirû dimîne jî, heke ji tovekî tenê xurekên taybetmendîyên wan curecur çêdibin, naxwe ev nîşan dide ku ev teserrufatî û tedbîra hebûneke zehf xurt û xwedî hikmet e.

Ji bilî vê jî, Xuda Teala ew gîya kirine dermanx-aneyeke xwezayî ji bo şîfa û dermankirina gellek

nexweşîyên mirovan. Hinek ji wan giyayan şîfa ye. Hinek ji wan jî xurek û ğiza ye. Hinek ji wan bedenê xurt dikin, qewetê didinê, hinek ji wan jî însan sağ dikin. Hinek ji wan jî bi jehr in, însan dikujin. Hinek giya, dema nû dibe, bi maddeyeke din werdigere. Hinek giya xwînê paqij û safî dikin. Hinek giya jî keyfxweşî û bextiyarîyê dide însan. Hinek ji wan însan aram û teskîn dikin û wî ditevizînin...

Ji bilî vê jî, ev giya bi navgîna av û asîta karbonîk şekir û xureka lazim hazir dike û dixe wicûdê [bedenê] û oksîjena lazim serbest berdide ji bo mexlûqat wê teneffus bikin. Ev bûyereke mezin e, hêja ye ku mirov li wê diqqet bike.

**Welhasil;** her pel û qirşa ku şîn dibe, mûtleqe ji bo beşeran têde feyde hene! Lêbelê însan xwe nawestîne ji bo kunh û heqîqeta van feydan hîn û waqif bibe.

Pelên giyayên ku bi awa, reng, bêhn û çêjên cure-cur ji erdê şîn dibin çiqas ew biçûk û besît bên dîtin jî, dikarin emelîyatên kîmyewî îcra bikin ku ti kîmy-agerek nikare tişteke wekî wan çêke. Ev çi qas tiştên mezin û xarîqûlade ne!

Nîzam û ahenga di şînbûna giyayan de jî, tecel-lîyata ezemeteke cuda ye. Wek nimûne; dareke çinarê, hersal bi mîlyonan tuxm çêdike. Tu dibê qey ji wan tuxman re paraşûtên ji pirtikan çêdibin, ji bo ew li hawîrdoran belav bibin. Ev tuxm bi bayê, heta bi cihên dûr tên kişandin. Heke ji dar-çinareke tenê, tuxmên ku

li hawîrdoran belav dibin, dareke çinarê ya din derketa, wê di zemanekî kurt de her devera dinyayê bi ber îstîla û dagirkerîya darçinaran biketa. Yanî ev dinyaya qerase û mezin dê ji dareke tenê re teng bihata. Pêkan e, mirov vê nimûnê ji bo candarên din jî qîyas û fereh bike.

Berîya çend salan Avûstralîyayan xwestibû ji cinsê giyayê kakîtosê dendikekê çêkin. Ji ber ku li Avûstralîyayê kêzikeke neyarê kakîtosê û xureka xwe jê bistîne nebû, giya bi lezûbezeke mezin belav bû. Vê pêşketinê Avûstralîyayî xistin nav fikaran, lewra di encamê de kakîtosan bi kite kiteyî qadeke bi qasî Îngîltere da ber xwe! Xelkê gund û bajarên ku li ser kevîya rê lê rast dihatin, mecbûr mabûn ku warê xwe bihêlin û herin; cotgehên wan mehû kirin.

Zanayên kêzikan li Avûstralîyayê dinya serûbin kirin ji bo çareserîyekê ji vê re bibînin. Di encamê de kêzikek dîtin ku ew li ser kakîtosê dijîya û ji bilî wê tişteke din nedixwar. Hem jî ew kêzik zehf bilez mezin dibû û li Avûstralîyayê ti neyarên wê jî nebûn. Hê mideteki dirêj derbas nebûyî wê zora kakîtosê bir. Êdî, îro kakîtos li qadeke tixûbdar e û ew hew dibe bela jî. Ji ewqas kêzik jî bes bi qasî ku kakîtosê di bin zextan de bihêlin, mane.[61]

Ev nimûne; dide xuyakirin ku kaînat, li gorî aheng û hevkêşîyeke ekolojîka [xwezayî û hawîr-

61 Îlîm-Ahlak-Îman, Berhevkar: M. Rahmî Balaban, sf. 190.

parêzîya] razdar birêve diçe ku eql bi hêsanî nikare di sirr û razên wê bigihe. Ji lewma ti eql û mentiq nikare hebûna şîyan û qudretekê înkar bike ku ew nahêle geşbûna hinek giyayan û zêdebûna heywanan bi vî awayê zehf zêdeyê ku ew jî gefan li heyata li rûyê erdê dixwin, asteng dike.

Dîsa hêjayê heyretê ye ku di axeke tenê de bi mîlyonan celebên çandinî û fêkîyên curecur şîn û geş dibin. Xudayê me rizqbexş e, wî ji her cinsê mexlûqatên xwe re sifrên cuda cuda amade kirine...

Wek nimûne; tişta ku mêşin dixwe, însan nikare gellekan ji wan bixwe. Tişta ku însan jî dixwe, mêşin nikare gellekan ji wan bixwe. Yanî nîmetên rizq jî bi hevkêşîyeke nazik û hessas di navbera mexlûqatan de hatine dabeşkirin. Ev ayeta pîroz qudreta Heq Teala di temînkirin û teqsîmkirina rizqê mexlûqatan de ji me re pêşan û erz dike û ew me vedixwîne tefekkureke kûr û dûr.

Heq Teala dibêje: **"Çiqas pirr heywan hene ku nikarin rizqê xwe hilgirin. Ellah rizqê wan û we jî dide. Her ew e, bîser û zana."**[62]

Bi rastî wesîlebûna mexlûqatan ji bo rizqê hev û din, tecellîyateke mezina rehma îlahî ye. Lewra teyrê sağlem daneyên êm tîne li ber devê teyrê nexweş datîne...

62 Enkebût, 29/60.

Ev çi qeder tişteke îbretengîz e ku ji roja dinya hatiye avakirin heta bi roja îro, rizqê ti mexlûqekî hîç nehatiye îhmalkirin û bêjimar sifrên îlahî hatine hazirkirin û danîn û ew her berdewam jî dikin.. Lewra heke em bifikrin; ji çar parên dinyayê sisê jê av e. Ji her çar paran, para mayî jî beşeke mezin jê çol û zinar in, ji bo şînkirin û geşkirina giyayan ne bikêrhatî ye. Para mayî jî beşeke hindik jê ax e. Lêbelê çi qas şîyan û qudreta Xuda Teala mezin û bilind e ku ev ax, -bi guhertinên bêdawî- kiriye serkehnîya xurek û rizq ku têra hemû zindî û candaran bike.

## Behrên Fereh û Pehn

Erd, ji çar paran sê parên wê di bin avê de ye. Bi xêra vê, ne sermaya qeşadara cemseran [qûtûban] dikare temamê dinyayê bixe bin bandor û tesîra xwe; ne jî germahîya kela-kela deverên tropîkal dikare temamê dinyayê bixe bin tesîra xwe... Bejahîya ku bi tîrêjên biroj û taverojê germ dibe, vê germahîya ku berhev dike jî wekî radyatorekî li hawîrdorê belav dike. Behr jî digel ku bi mîlyonan kalorîyan ji taverojê werdigre jî, bes dikare heta çend pileyan germ bibe. Lêbelê ew piştî germ dibe jî, bi hêsanî sar nabe. Yanî zehftirbûna behran ji bejahîyan; di tertîbkirin û rêxistina av û hewayê de û di rêgirtina li dijî germbûna zêde û sarbûna zêde de erk û wezîfeya termostatê [germîrêxer] bicih tîne. Di heman demê de ew bi buxarbûnê îhtiyaca bejahîyê ya bi avê

jî pêşwazî dike. Heke li sererdê behr û derya hindiktir bûna, buxarbûn jî wê kêm bibûya û dê bi sedem ziwayî û hişkesalîyê jî her teref bibûna çol û beyar.

Taybetmendî û xusûsîyetên cewher û zindîyên di deryayê de ji yên ser erdê ne kêmtirîn e. Sedef, durr, mercan û tiştên zînetê yên din bi taybetî xurek û ğizayên ter û taze yên ku ji behran tên derxistin, ji bo însan xwediyê cihekî mûhîm û giring in.

**Av**

Jîyana hemû zindî û candarên li sererdê li ser avê ye. Heke îhtiyaca însan bi av vexwarinê çêbibe û ew bi dest wî nekeve, ku gencîne û xezînên sererdê tev yên wî bin jî, ji bo bidest-xistina avê, ewê bê tereddud û dudilî wan tevan feda bike. Paşê heke nikaribe ava ku vexwariye derxîne derve û birijîne, heke temamê mal û milkê dinyayê yê wî be, ji bo wê derxîne derve, ewê bê tereddud û dudilî wî lê serf û xerc bike. Gerek e mirov li rewşa însan heyirî bimîne! Ew çawa di çavên xwe de dînar, dirhem û cewheran mezin dike; lê ji têgihiştina mezinbûna nîmeta Xuda Teala ya di qurtek av de ğafil dibe![63]

Ew însanê ku karibe bi awayekî layiq heqîqetên bêjimar yên wekî van tefekkur bike, ewê ne dereng; lê zû fehm bike ku hemû candarên li sererdê hene, ji bo li heyatê û sağ bimînin çawa îhtiyaca wan bi arîkarî û

63 Binêrin, Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 65-66.

hîmaye ya bi zanîn, qudret û şîyaneke mezin heye. Ewê fehm bike ku ew di alema mûcîzat û xarîqûladeyên îlahî de di nav şert û mercên mûsaid de dijî. Ew mûcîze û xarîqûlade di jîyana di wan şert û mercan de arîkarîya wî dikin. Heke na, ti hêz û qewet bi ti awayan bi tena serê xwe nikarin wê tehqîq bikin. Ti eqlê ku vê fehm bike, di mentiq, îz'an û wijdanê de nikare li ber Xuda Teala yê aferîner û rêxerê aleman rabe, nankorî û mekrohîyê bike.

**Raz û Hikmetên Di Heywanan De**

Divê em bi diqqet li teyr û tûrên ku di asîmanî de difirin, li heywanên berrî û kedî û li kêzikên biçûçikên ku bi zehmetî bi çavan tên dîtin, binêre. Lewra di wan de sosret û ğerîb-razên wisan hene ku mirov ne di destê xwe de ye, nikare li hemberî mezinatî, qudret, şîyan û hikmeta Heq Teala yê ku ew aferandine û xuliqandine, heyran û devqîç nemîne!

Gelo Heq Teala ew endam û azayên dehşetengîz di wan heywanên biçûçik ên ku bi zorê bi çavan tên dîtin de çawa bicih kirine?! Ew çawa dikarin bê kêmasî wezîfeya xwe bicih bînin?! Heta tam vewejartin û keşfkirina xusûsîyet û taybetmendîyên wan jî, zêdetirî taqeta îdrak û têgihiştina însan e.

Heke însan, bi baldarî û diqqet li heywanên hawîrdora xwe û li şekl û sûretên wan meyzîne, paşê vegere û

bi nêrîna îbret-girtinê li çerm, hirî, kej, goşt û şîrên ku ji wan tên dabîn û temînkirin seyr û temaşe bike, ewê rehm, lutf û kerema bêdawîya Heq Teala bibîne. Xudayê me yê mezin, post û çermekî taybet û xusûsî daye wan ji bo wan ji sir û sermayê biparêze. Simên sitûr dane wan ji bo lingên wan mûhafeze bike û bi awayê sipehîtirîn hemû îhtiyacên wan pêşwazî û dabîn kirine.

Wek nimûne; heta ew perperîkên ku digel hefteyeke tenê, yan jî du hefte temen û emrê wan heye, Xuda Teala ew di nav nexş û nîgarên sipehî de endamên wan erz û rapêş kirine. Ew bi beyankirina lîsanê halê xwe çi û çi vedibêjin... Ev bes yeke tenê ye ji xarîqûladeyên bêdawî yên îlahî ku ji bo nêrîna çavan, têgihiştina eql, bi taybetî jî ji bo hessasîyeta dilan hatiye pêşkêşkirin...

Di Qur'ana pîroz de ji me tê xwestin em li hêştiran binêrin û li serê tefekkur bikin ka ew çawa hatiye xuliqandin:

**"Ma ew li devehê nanêrin ka ew çawa hatiye aferandin?! Ma ew li asîmanî nanêrin ka ew çawa bêstûn hatiye bilindkirin?! Ma ew li çiyayan nanêrin ka ew çawa di erdê de hatine çikandin?! Ma ew li erdê nanêrin ka ew ji bo jîyana wan çawa hatiye raxistin?! Naxwe bi ayetên min şîret li wan bike û peyamên min ji wan re teblîğ bike. Lewra tu bes şîretkar î."**[64]

64 Ğaşîye, 88/17-21.

Naxwe dema mirov çêbûna heywan û mexlûqatên din hûr û kûr bikole, mirov dê li tecellîyatên mezinatîya Heq Teala rast were.

Cenabê Heq Teala taybetmendî û xusûsîyetên wisan dane hemû candaran ku digel ew xureka xwe ji heman ğiza û xwarinan werdigrin jî; lêbelê ber û mehsûlên cuda cuda tînin meydanê. Ev hemû, bi awayê ku jîyanê tevî mûmkin bikin, hev û din temam dikin.

Wek nimûne; heke çêlek û mêşin pelên şîn yên tûyan bixwin, ji wan goşt, şîr û hirî hasil dibe. Kurmê hevrîşm kurmikekî biçûçik e, ew ji heman pelê hevrîşm çêdike. Dema ask û ğezal jî wê bixwe, bêhna miskê jê tê bidestxistin. Mêşa hinguv ji lipên fetrîmkirina çîçekan hinguv çêdike. Ev tişt hemû li derveyê îqtîdara însan çêdibin ku ew bi xwe li kaînatê heyber û mexlûqekî mûkemmel e.. Curecur çîçekên ku wek giyayekî besît û nehêja tên dîtin, dikevin nav axê û ew jê çîçekê reng, bêhn û pelên wan curecur derdixin. Hal-hal e ew hemû ji axeke tenê ne. Ev rewş û sûretên xarîqûlade ne, ku ti kîmyagerek nikare wan çêke.

Heywan, bi bername û programa îlahî ya ku ji wan re tê dayîn, dikarin ji giyê, goşt û şîr çêkin. Hal-hal e însan, digel ku ew tekûztirînê mexlûq û heyberan e û ew di roja me ya îro de xwediyê teknolojîya çêtirîn e jî, dîsa ew di laboratûvarên kîmyayî de nikare ji çend ton giya yek gram goşt, yan jî şîr çêke.

Xudayê me yê mezin wiha dibêje:

**“Bêguman ji we re di terşên deveh, dewar û pêz de jî îbretek heye; em, we ji şîrekî safî û parzûnkirî didin vexwarin ku di zikên wan de ji navbera rîx û xwînê dertê û ew di ber vexweran de xweş diçe.”**[65]

**Mêşa Hinguv**

Heq Teala wiha dibêje:

**“Piştre ji texlîtên fêkiyan bixwe, bikeve wan rêyên ku Xudayê te ji te re hêsan kirine, ji navbera wan şerbeteke renga reng têder. Di wî hinguvî de ji mirovan re şîfa heye. Bêguman di wê de ji bo qewmekî ku tefekkur bike, nîşanek heye.”**[66]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dibêje:

*“Ez bi wî kim ku nefsa Mûhemmed di destê wî de ye, mûmîn dişibihe perçekek zêr, xwediyê wî li serê pif dike, lê ew neguherîye û kêm jî nebûye. Ez bi wî kim ku nefsa Mûhemmed di destê wî de ye, mûmîn dişibihe mêşa hinguvî, ew tiştê temîz dixwe, tiştê temîz datîne meydanê, datîne cihê temîz û cihê ku lê datîne jî ne dişikîne, ne jî xirab dike.”*[67]

---

65 Nehl, 16/66.

66 Nehl, 16/69.

67 Ehmed, II, 199; Hakim, I, 147.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], dema li vir sifetên mûmînî zikr dike, di eynî zemanî de sipehîtî û hikmetên ku di mêşa hinguv de hene jî destnîşan û îşaret dike.

Mufessir **Huseyn Kaşifî** wiha dibêje:

"Kîjan însan tefekkur bike, ewê bizane ku Xuda Teala li ser kirina her tiştan qadir û kare ye û ew bi her tiştan jî zana ye, wî mêşa hinguv, ev heybera lawaz û zeîf aferandiye û têde gellek raz û hikmet danîne.

Mêşa hinguv bejna wê xwehr e, lê ji îstîqametê cuda nabe.

Ew, fêkîyên ku jê re hatine sipartin, hem yên tehl, hem jî yên şîrîn dixwe û bi şûn de jî hinguvê şîrîn dide.

Ew, ewqas xwediyê wer'e û teqwayê ye ku pak û safî ye, ji wê pê ve kes nikare bixwe.

Ew, ewqas îtaetkar e ku hîç ji fermana Heq Teala dernakeve.

Wê wisan ji xwe re warek girtiye ku diçe deverên bi fersexan dûr; lê dîsa vedigere welatê xwe.

Ew, ewqas paqij e ku li ser pîsîtîyan nadeyne û wan naxwe jî.

Ew, ewqas xwedî pîşe û huner e ku temamê mîmar [avahisaz] û mûhendisan [endazyaran] kom bibin, nikarin karê wê bikin.

Ha ew hinguvê ku ew çêdikin ji bo nexweşîyên zahirî şîfa ye. Her wiha ew ji bo mirovê ku rewşa wê tefekkur bikin jî, ji bo nexweşîya batinî; cehaletê jî şîfa ye."

**Xarîqûladetî û Siriştîya Fitretê**

**Îsmaîl Fennî Ertûğrûl**, vedibêje; heywan heyat û sağîya xwe li gorî bername û programeke îlahî dewam dikin ku jê re "sewqa tebîî [zêhna bin hişmendîyê] ya heywanan" tê gotin.

Ew wiha dibêje:

"... Heywan, bi fitreta xwe -bêyî ti perwerde-kekê- xurek û ğizaya ku ji wan re bihavil û feyde be û tiştên ku ji bo parastina heyata wan û berdewamkirina nesla wan lazim be, dizanin. Teyr û tûr ji xwe re hêlînên sipehî çêdikin. Teyr û tûrên koçber jî ji bo hazirîya sefer û rêwîtîya xwe di rojeke pêzan de li hev kom dibin. Hinek ji kêzikan berî bimrin, bi tevizandin û bêkar-kirina ğudde/toşpîyên hinek kêzikên din radibin lê wan nakujin, wan şeht dikin û dixin rewşeke wisan ku nikaribin birêve biçin û wisan wan datînin kêleka xwe, ji bo dema biçûkên wan ji hêkên wan derkevin, xureka xwe jê wergirin. Lêbelê çi tecellîyateke ğerîb û bi sosret e ku piştî ev kêzik mezin dibin, xureka wan, hinek ğizayên dîtir in. Herçî mêşên hinguv in, şîyan û amadekarîya

wan heye ku zayend û cinsîyeta kurmikên xwe bixin nêr, yan jî mê, ew jî bi awayê guhertina xureka wan çêdibe. Dema kiwara mêşan, ji ber bûyerekê ji nêrê xwe mehrûm bibe, mêşa hinguv dikare bi vî awayî, kurmikê xwe bi keybanûyekê biguherîne ji bo hukm li şanê bike."[68]

Dîsa çi îbretengîz e ku kermozek li ser kulehekî mûsellet dibe, jê re di erdê de kortikekê vedike; wê ji cihekî wê yê wilo ve dixe wê kortikê, kêzik namire, lê ji xwe diçe; heta ew dibe wekî goştekî parastî. Paşê ew di zeman û mekanekî wisan mûnasib de hêk dike ku dema çêlîkê wê derdikevin, ew goştekî taze li ber xwe hazir dibînin ji bo xureka xwe jê wergirin... Dêya wan jî difire, diçe deverên dûr û bêyî çêlîkê xwe bibîne, dimre.. Her wiha bizav, hereket û teknîkên esrarengîz bi peyvên wekî **"hînbûna piştre"** û **"întîbaq=ahengdarî"**yê nayên îzahkirin. Lêbelê cenabê Heq Teala ji wan re bexş kiriye.[69]

Masîyê Somonê çêlîk, piştî ku bi salan di behrê de dimîne, li welatê xwe yê eslî, li çêm vedigere. Hem jî vedigere tam cihê ku lê welidîbû, li perava ku çem dirije li ser şetê mezin.

Kî ev hest û his dayîyê ku ew pê tam nuqte bi nuqte tê cihê xwe. Heke hûn vî masîyî bixin çemekî din ku ew jî diherike ser heman şetî, di cih de ewê

68 Îman Heqîqetlerî Etrafinda Sûallere Cevapler, sf. 58-59.
69 Binêrin, Îlîm-Ahlak-Îman, berhevkar: M. Rahmî Balaban, sf. 189.

fehm bike kudi rêyeke şaş de ye. Vêca dubare ew bi paş paşkî vegere, bikeve çemê xwe yê pêşî. Piştre tam berevajîyê îstîqameta ku çem pê ve diherike, ewê vegere û bikeve ser rêya çemê ku têde çêbûbû.

Herçî çareserkirina sirr û razên marmasî ye, ew hîn zortir e. Ev mexlûqatên ha, însan di heyret û dehşetê de ğerq dikin. Dema wext tê ku ew çêlîkên xwe bikin, ew ji hemû gol û çemên dinyayê tên nêzîkî giravên Bermûda[70] li kûrahîyên wan çêlîkên xwe dikin û dimrin. Ewên li Awrûpayê jî bi hezaran mîlan ji okyanûsê derbas dibin û tên heman cihî... Hinek guman dikin ku ev çêlîkên biçûçik tişteke din nizanin, bes ew dizanin ku di aveke bê ser û binî de dijîn, ew dikevin ser rêya xwe û vedigerin cihê ku jê hatine. Di dawîyê de ew digihîjin eynî sahilê ku dê-bavên wan hatibûnê. Ew bi vê jî bes nakin, ji wir jî tên çemê ku dê-bavên wan têde jîyabûn, diçin gol, yan jî deryaçê. Heta vêga, li avên Awrûpayê hîç li marmasîyekî Amerîkayê, li avên Amerîkayê jî hîç li marmasîyekî Awrûpayê rast nehatiye. Heta ji ber ku rêya wan dirêj e, Xuda Teala temen û emrê marmasîyên Awrûpayê bi qasî salekê zêdetir dirêj kiriye!

Gelo jêdera hissa îstîqameteke ev qas xurt çi ye?[71]

70 Giravên Bermûda, kom-girav in, li okyanûsa Atlasê, dikevin rojhilata DYA û bakurê Karayîpan li deryaya azad.
71 Îlîm-Ahlak-Îman, berhevkar: M. Rahmî Balaban, sf. 188-189.

Ev rewşên xarîqûlade û mûcîzewî yên ku di heywanan de tên dîtin, bi awayekî eşkere nîşan dide ku ew bi tesadufî nehatine wicûdê û bi rasthatinî jî hereket nakin. Lêbelê berevajî vê, ev hemû li gorî plan û programa wê qudreta ku ew xuliqandin, ji wan re danî, bicih dibin.

Yek ji delîlên hebûn, şîyan, mezinbûn û selteneta Xudayê me ye ku di heywanan de pêhis û şiûreke bilind heye, ew qumandê li wan dike û wan birêve dibe. Xudayê me van delîlan ji beşerîyetê re nîşan dide, ji bo tam derxîne meydanê; kîjan însan dê heqîqetê bibînin û ji heqiyê re teslîm bibin û kîjan însan jî digel tecellîyatên mûcîzewî yên li pêş çavên xwe jî dîsa li hemberî heq û heqîqetê bi israr xwe kor bikin.

Çawa Ayeta pîroz jî wiha ferman dike:

**"Bêguman Xuda ji xwe re kêmayiyê nabîne ku meseleya heqiyê bi pêşûyekê û bi tişteke hê ji wê jî wêdetir, jê biçûktir jî eşkere bike. Herçî ewên ku îman anîne ji xwe dizanin ku bi vî awayî, dayîna nimûnan heq e û ji cem Xudayê wan e. Lêbelê ewên ku kafir in, dibêjin: "Ma Ellah bi vê nimûnê çi qesd dike?" Xuda, bi vê gellek însanan ji rê derdixe û gellekan jî tîne ser rêya rast. Xuda, bi vê ji fasiqan pê ve ti kesî din ji rê dernaxe."**[72]

72 Beqere, 2/26.

## Aferandina Kaînatê ya bi Cot

Xuda Teala hemû mexlûqatên xwe cot aferandine û wehdanîyet û yekbûn û tekbûn jî kiriye xasê xwe tenê.

Çawa ayetên pîroz jî wiha dibêjin:

**“Me ji her tiştê cot; nêr û mê aferandine. Da ku hûn li serê bifikirin û şîret jê bigrin.”**[73]

**“Xuda, asîman, bêyî stûneke ku hûn bibînin aferandine. Li erdê jî çiyayên bilind û cihgirtî danîne da ku we nehejîne û li wê deverê her curegiyanewer aferandine, belav kirine. Em ji ewrên asîmanî avekê dadixin ku pê her texlît giyayên bi feyde li sererdê hêşîn dikin.”**[74]

Îlmê musbet [pozîtîf-erênî] ji demeke nêzîk ve çawabûnîya cotbûna mexlûqatan tesbît kiriye. Halev e ku ji berî çardeh çerx û sedsalan ve ayetên Qur’ana pîroz ew rastî ji me re ragihandine û ew wek xelateke îlmê ji însanîyetê re pêşkêş kirine.

Ev kaînata ha, bi giringî û hessasîyete wisan hatiye amade û tezyînkirin ku ew ji têgihiştin û zewqa însan biwêdetir e.. Her tişt, însan, heywan, giya, zerre û heta regezên bi sirr û raz yên di nav atomê de, her wekî elektron û protonê jî, her yek ji wan li gorî kesayetî û

73 Zarîyat, 51/49.
74 Luqman, 31/10.

rewşa xwe dibin pêbend û peyrewê vê qanûna balkêş **"qanûnaîzdîwac=cotbûnê"**. Ev jî ji me re ufûq û asoyeke fereh û mezin a tefekkurê, vedike.

## Tefekkur-kirina di Nîmetên Xuda Teala de

Mezintirîn nîmeta ku Xuda Teala ji me re bexş kiriye, ev e; wî em "însan" xuliqandine û em li dinyayê jî xistine mislimanan û anîne nav hawîreke misliman. Nîmeta ji vê jî mezintirîn ev e, wî em kirine ummeta mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û di Qur'ana pîroz de jî em kirine mûxateb û berpeyv.

Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji me re nimûneyeke fiêlî û mûkemmel e ku bizav û tevgerên Qur'anê têde eks dibin û pratîze dibin. Ew kitêb û hikmetê li me hîn dike û alema me ya hundur û derûnî ronak û berraq dike. Heke em bi heqî di qedr û qîmetê van nîmetan tenê jî, bigihin, divê em hîç serê xwe ji sicûda şukrê ranekin.

Nîmetên cenabê Heq Teala ne ev tenê ne. Gellek nîmetên wî yên din jî, her wekî tavîbaranekê her wext û an bi ser me evdên wî de dibarin.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dibêje:

*"Xuda Teala gotiye; tu înfaq bike, ezê jî li ser te înfaq bikim. Xezîneyên Xuda fereh in. Rizqê ku ew dide*

*hemû mexlûqatan tiştekî ji xezîneyên wî kêm nakin. Ew bi peyhev-hatina şev û rojan înfaq dike û qut nake. Ji wexta ku Xuda erd û asîman xuliqandin ve li ser tiştên ku wî înfaq kirine tefekkur bike! Van tiştek ji milkê wî kêm nekirine."*[75]

Heqê nîmetê, ev e, mirov li ser wê tefekkur bike. Mirov wê li ser hebûna aferînerê wê bixe delîl. Mirov şîyan, qudret û îhsanên wî tefekkur bike û li ser wan jî şukrê wî bike.

Ûmer kurê Ebdûlezîz -rehma Xuda lê be- wiha dibêje:

"Bi zikrkirina Xuda Teala sohbetkirin pirr sipehî ye. Tefekkur-kirina li ser nîmetên wî jî, ji îbadetên çêtirîn e."[76]

**Kufrana nîmetê;** yanî nankorî jî, îhmalkirina şukrê nîmetê ye, xerckirina wê di şehwetên nefsanî yên bedenî, nefsa nehêja de ye û ziyankirin û telefkirina wê ye. Ev rewşên wiha, însan ji heqiyê, ji nîmetbexş û dayendê îhsanê dûr dikin.

Şukr sê beş e:

1. Şukrê Qelbî ye; tefekkurkirina nîmetê ye.

2. Şukrê Lîsanî ye; kirina hemd û senayên nîmetê ye.

75 Buxarî, Tefsîr, 11/2, Tewhîd 22.
76 Ebû Nûeym, Hilye, V, 314; Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 45.

3. Şukrê Azayan e; Nîmet, mûsteheqê çi be, divê mirov hember û heqê wê bide.

Li alîyê din jî, hatiye gotin; **"Şukrê nîmetê ji cinsê wê dibe."** Yanî cenabê Heq Teala ji bo me çi kerem kiribe, divê em hinek ji wê ji bo bêbehr û mehrûman îkram û îhsan bikin. Çawa ku ayet ferman dike, dibêje:

**"Bi wî malê ku Xuda daye te mala axretê bixwaze. Lêbelê para xwe ji dinyayê jî ji bîr neke. Xuda wekî ku qencî li te kiriye tu jî wisan qenciyê bike û li sererdê tevdanê nexwaze. Lewra Xuda, ji fesadkaran hez nake."**[77]

### Tefekkur-kirina bi Her Wesîleyan

**Zîya Paşa** wiha dibêje:

Di kağezeke te de hezar dersên mearifê tên xwendin.

Ya Reb, çi xweş mekteb dibe, mekteba alemê!

"Di her rûpeleke kitêba vê kaînatê de, bi hezaran dersên îlmê merîfetê tên xwendin. Ya Rebbî! Ev alem, çi xweş mekteb e ku mirov xwe di deryaya tefekkurê de noq bike û îbretan wergire."

77 Qeses, 28/77.

**Sufyan kurê Ûyeyne,** alimê mezinê Îslamê di îzahkirina vê rewşê de zehf caran ev gotin dubare dikir û digot:

*"Heke însan, xwediyê tefekkurê be, ewê ji her tiştê îbretekî wergire."*[78]

Ji lewma Ereb jî dibêjin:

**"Tiştê ku mirov îbret jê bigre zehf in, lê mirovên ku îbret bigrin nîn in."**

## Her Zerre Xuda Vedibêje

Heke însan hîn bibe bi tefekkur-kirinê kitêba kaînatê bixwîne, her zerreyeke ku li hawîrdora xwe dibîne, ewê ezemet û mezinbûna cenabê Heq Teala ji wî re vebêje. Ewê wî nêzîkî merîfetûllah [naskirina Xuda Teala] bike.

**Fuzûlî** çi xweş dibêje:

Olsa îstîdâd-i ârif, kâbil-i idrak-i vahy,
Emr-i Hak irsaline her zerredir bir Cebreîl!

*"Heke arif, ji bo têgihiştina wehîya îlahî xwedan qabilîyet bûya, her zerreyek li kaînatê dê bibûya Cebraîl ji bo fermana Heq Teala jê re bigihîne."*

Heq Teala wiha dibêje:

78 Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 45.

**"Na! Ez bi mexlûqên ku hûn dibînin û mexlûqên ku hûn nabînin jî sûnd dixwim; bêguman ev Qur'an, gotina Xuda ye, wî ew ji peyğamberekî pirr birûmet re şandiye."**[79]

Yek ji hikmetên sûndên ku di Qur'ana pîroz de hene jî, ji bo diqqet û bal kişandina ser îbret, feyde û hikmeta ku di heyberên sûnd bi wan hatiye xwarin e. Bi wê tê arzkirin ku evd di nav wergirtina îşaretên ji wê ezemetê de hest û pêhisên xwe zehf kûr bike..

Ji lewma hemû heyber û mexlûqatên ku em wan dibînin û yên ku em wan nabînin jî berate û elametên qudret, şîyan û ribûbîyeta Ellah Teala ne. Dema mirov di wan de tefekkur bike, mirov dê di wan de hikmet û îbretên bêjimar û bêtixûb bibîne û ji wan îbret û ders bigre.

Tuxmê çinarê yê wekî zerreyekê bi wasîte û navgîna axeke bikêrhatî dibe dareke nehîtî û îhtîşamê qezenc dike. Sirr, hikmet û îbretên ku însan di encama xurtkirina tefekkur û texessus û xurek wergirtina ji rûhê Qur'anê digihêjîyê de mezin û mûhteşem dibe.

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**"Bêguman li erd û asîmanan ji bawermendan re pirr ayet û 'îbret hene. Bêguman di aferandina we mirovan û wan rûhberên ku Xuda wan li sererdê belav dike de, ji bo qewmekî ku ji dil û can îman**

79 Haqqe, 69/38-40.

**tînin pirr nîşan û delîl hene. Bêguman di peyapey anîn û guhertina şev û rojê de, di wî rizqê ku Ellah ew ji asîmanî anîye xwarê de û bi wê erdê, di piştî mirina wê de sağ û hêşîn dike de û di guherandin û anîna bayê ya ji hemû aliyan de ji bo qewmekî ku fêhm dikin pirr ayet û 'îbret hene!."**[80]

Himbizkirina [teksîf û tîrkirina] dil û zêhnan li ser van nimûneyên tefekkurê yên di Qur'ana pîroz de, dê însan bibe keş û hewaya "Teqwa"yê. Çawa îhtiyaca çîçekan bi hewa, av, ax û tîrêjê hebe, eynî wisan qezenckirina tefekkura astbilind û layiq jî bi Teqwayê ve pêbend e.

Cenabê Heq Teala ji evdên xwe dixwaze ku ew bibin însanên jîr, bi nezaket, tije-fehm, bîrewer û ramandar. Ji ber vê sedemê, divê misliman bi her wesîle û navgînê û bi heyecana îbadetê berê xwe her bide ser tefekkurê. Ev gotina Rabîe hevsera Ehmed kurê Ebûl-Hewarî ye, ew nimûnekeke çi sipehî ye. Ew wiha dibêje:

"-Ez çi dema bangê bibihîzim, ez banga qiyametê tînim bîra xwe.

-Ez kengê bibînim ku berf dibare, ez dibim wekî ku dibînim wa ye, defterên emelan di hewayê de difirin.

80 Casîye, 45/3-5.

-Ez çi wextê refekî kulehan bibînim, ez heşrê tînim bîra xwe."[81]

Li gorî hatiye guhastin, xelîfe Harûn Reşîd çûbû hemamê. Serşo bi şaşî ava kelî bi ser de rijand. Vêca xelîfe Harûn ji şewta laşê xwe û îzdîrabên dijwar xwe diavêje derve, bi hezaran sedeqan dide û wiha dibêje:

"-Ez îro ava hemamê tehemmul nakim, heke roja qiyametê ez bibin rêwîyê cehnemê, halê min dê çawa bibe!"

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi hemd û şukrê berê xwe her dida Rebbê xwe û wî çi didît, ji xwe re îbretek jê derdixist. Divê em jî hewl bidin ku ezemet û mezinatîya Xuda Teala di her tiştî de seyr û temaşe bikin û bibînin. Em jê zad û xurekeke menewî ji bo hestên xwe, fikr û ramanên xwe û pêhisên xwe wergirin. Naxwe dema misliman li heyv, roj, berga hewayê/atmosferê, li xwe, li zarokên xwe û bav û kalên xwe meyzîne, yan jî ew li çi meyzîne, divê bi çavê dil peyamên îlahî yên ku bi wasîte û navgîna van jê re hatine dayîn, bixwîne. Divê ew li serê tefekkur bike ka ew çawa hatiye û ew ji kuderê hatiye? Ew çawa dikare di jîyanê de berdewam bibe? Kî şekl û şemal û beden û endam daye wî? Kî temen, jîn û emr ji wî re dîyar kiriye? Ewê piştî mirinê biçe kuderê? Divê ew tefekkur bike ku heyat û kaînat bi hikmet birêve diçin

81 Sulemî, Tabeqatûs- Sufîyye, Beyrût 1419, s. 406.

û tiştek hewante û ebes, pûç nehatiye aferandin! Divê ew destûra nefsa xwe nede ku ew bêqeyd û şert li gorî hewa û hewesa xwe neçî û nemeşe. Divê tim û daîm xeber û haya wî ji ezemet û qudreta îlahî hebe.

### Heq Teala Çima Ev Kaînat Aferand?

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**“Me, erd û asîman û mexlûqên navbera herduyan jî bi leystikvanî û bêarmanc neaferandine! Me, ew herdu bes bi heqiyê aferandine; ew yekîtî û qudreta me nîşan didin. Lêbelê pirranîya wan vê rastiyê nizanin.”**[82]

Însanê ku kaînatê tefekkur dike, mirad û mebesta Xudayê me fehm dike ku wî her tişt ji bo hedef û armancekê aferandiye û ji bo xizmeta evdên xwe pêşkêş kirine. Paşê divê ew berpirsîyên xwe bifikre û ew bi îtîna û îhtîmam erk û wezîfeya xwe ya evdînîyê li hemberî cenabê Heq Teala bicih bîne. Lewra bêhestbûn û nankorî li hemberî van îkram û îhsanên mûezzem yên cenabê Heq Teala, ğefleteke tehl tê jimartin ku ew jî ne layiqê şeref û îzzeta însan e.

Divê însan ji bîr neke ku ewê hesabê van hemû nîmetan bide. Çawa ku Heq Teala ferman dike:

82 Dûxan, 44/38-39.

**"Piştre ew roj, hûnê ji nîmetên xwe yên dinyayê bêne pirskirin!"**[83]

Welhasil; em ji Xudayê xwe re, li hemberî hemû nîmetên îlahî yên ku xebera me ji wan hebe, yan jî xebera me ji wan nebe, deyndarê şukr û evdînîyeke bêjimar û bêdawî ne. Xwezîya me bi wan arifan be ku haya wan ji hest û têgihiştina wezîfeyên xwe hebe û ji bo îfakirin û bicihanîna wan cehd û xebat dikin!..

83 Tekasur, 102/8.



# TEFEKKUR KİRİNA Dİ ÎNSANÎ DE

Heke em tefekkur bikin bihizirin; emê bibînin ku ev cihê em vêga pêlê dikin û tê re derbas dibin, heta îro ji cesedên bi mîlyaran însanên ku hatine, mirine û bûne ax, tije ye. Her wekî ku ew bi mîlyaran sih in, bi hev û din ve li ser hev hatine pevekirin û bi hev û din ve qerastin.. Sibê, emê jî digel kar û emelên xwe di sing û pêsîra vê axê de bêne definkirin û veşartin. Emê bi kirin û emelên xwe re di siha himbiz û tîr de bipalin, bihelin û bên veşartin. Piştî wê jî, dê ji bo heyateke ebedî û rêwîtiya ber bi heta hetayê ve destpê bike. Naxwe, bila em hinekê rawestin û bihizirin: Gelo guherandina anê [kurte-demekê] bi heta hetayê karê kîjan eqlî ye?!

# TEFEKKUR KİRİNA Dİ ÎNSAN DE

**Hûrînîyên Xarîqûlade di Aferandinê de**

Cenabê Heq Teala wiha ferman dike, dibêje:

وَفِي الْاَرْضِ اٰيَاتٌ لِلْمُوقِنِينَۙ. وَفٖٓي اَنْفُسِكُمْۜ اَفَلَا تُبْصِرُونَ

**“Li erdê ji bo yeqînker û bawermendan nîşan hene. Di we bi xwe de jî nîşan û ‘îbret hene, ma hûn wan nabînin?”**[84]

Xudayê me, însan ewqas mûhteşem [bi rêkûpêk û mukemmel] û mezin aferandiye ku di serdema me de digel keşif û îcadên bêjimar yên ku ji terefê îlm û teknolojîya çêtirîn jî ve tên kirin jî, negihiştine dawîya sir, raz, hikmet û xarîqûladeyên ku di wî de hene.

Di ayeta pîroz de wiha tê gotin:

84 Zarîyat, 51/20-21.

**"Hey Mirov! Çi tiştê tu, li hemberî Xudayê te yê merd û mezin xapandî? Ew Xudayê ku bê kêmasî tu, durust, endam sağlem û mutedil aferandî; êdî kîjan awayî de xwestibe, tu wisan di sûretê sipehîtirîn de berhevkirî û çêkirî."**[85]

Cenabê Heq Teala di vir de rabûrî û mazîya însan di bîra wî tîne û bang lê dike ji bo ew di aferandina xwe de tefekkur bike. Ji xwe Xuda Teala, însan kiriye tekûztirînê hemû mexlûqan. Ew di şekl û awayê sipehîtirîn de aferandiye û ew ji aveke weza û ne xwazyar xuliqandiye.[86] Naxwe, rewşa însan, ewê kudi hukmê "hîç"ê de ye, ew mexlûq û heyberê mirok û fanî, ewê ku Xuda yê xwediyê îlm, hikmet û qudreta bêdawî ew ji dilopek ava weza wek mexlûq û heyberekî mûhteşem anîye wicûdê, bi qeweta xwe bawer dibe û li hemberî Xudayê xwe radibe, îsyan dike, çi rewşeke ebes û pûç e!..

Tibb, hê ji nû ve merhele û qûnağên aferandina însan keşif dikin, lêbelê di ayetên Qur'ana pîroza ku berî 1400 salan hatî nazilkirin de wiha teswîr kiriye[87] û gotiye:

---

85 Înfîtar, 82/6-8.

86 Binêrin, Ebese, 17-22; Rûm, 20; Însan, 21; Qîyame, 36-38; Murselat, 20-22; Yasîn, 77.

87 Ji berî 1400 salan ve Qur'ana pîroz ji terefê her keşf û îcada fennî ve hatiye teyîd û destek-kirin. Ev kitêb, bi wasîte û navgîna Pêğemberekî Ummî [nexwenda] ji beşerîyetê re hatiye pêşkêşkirin. Digel ku Qur'an ji gellek qanûnên îlahî yên di vê kaînatê de carî û derbasdar in, û bi hezaran hedîsên ku wan qanûnan eks dikin û didin xuyakirin, digel ku ti keşf û îcadeke modern ti herfeke wê jî tekzîb nekirine û ew derew dernexistine, ev rewş delîleke qet'î tê jimartin û nîşan didin ku ev kitêb rast û heq e.. Xuda bi rêya

**“Sûnd be, me mirov, ji encamekê, ji heriyê aferandiye. Piştre me ew, kiriye nutfe; dilopa ava meniyê û ew daniye malzarokê; cihekî ewle û sağlem. Piştre me avedilopa meniyê aniye halê xwîneke hişk; peyre me xwîna hişk kiriye pişikek goşt; me ev pişika goşt kiriye hestî, me ew hestî bi goştî nixumandiye, paşê me ew wek mexlûqekî nû daye pêkanîn. Ellah pirr bilind e, sipehîtirînê aferîneran e! Piştre, bêşiwar hûnê di pey vê de hemin bimirin. Piştre jî bêguman hûnê, roja qiyametê dîsa bêne sağkirin.”**[88]

Çawa aferandina însan bi xwe wî vedixwîne tefekkurê, eynî wisan endam û azayên bedena wî jî bi lîsanê halê xwe wî vedixwînin tefekkurê. Yanî çavên me,

---

wehîyê ew ji pêğemberê xwe re şandiye xwarê. Yanî Qur’anê tim û daîm berî îlmê beşerî behsa wan heqîqetan kiriye. Paşê hemû keşf û îcadên din tên û wê tesdîq û destek dikin.

Hinek mutefekkir û hizredarên rojavayî, yên ku li hemberî Îslamê helwesteke selbî û neyênî ji xwe re nekirine sereta û prensîp û ew ketine ser rêya hîdayetê, piştî ew heqîqetên ku di wan ayet û hedîsan de berî 1400 salan hatine beyankirin ku ew jî behsa merhele û qûnağên aferandina însan dikin, hûrkolane, ketine dehşet û heyretê!. Lewra îlm bes di vî zemanê me de gihaye wan heqîqetan. Yek ji wan aliman jî alimê Fransî, zanayê embrîyolojîyê Prof. Dr. Maurice Bucaille bi Îslamê hatiye mûşerrefkirin. Digel ku hinek nimûnên din ji vê re hene jî, ev nimûne tenê jî heta tu bibê bes, giring e. Ev şexsîyetê ku me behsa wî kirî, kitêba wî bi tirkîya me jî hatiye tercumekirin. Bi vê navgînê em wesîyet li xwendevanên xwe dikin ku kitêbên wî bixwînin: Musbet Îlm yonunden Tewrat, Încîl û Qur’an, [Ji Hêla Îlmê Erênî ve Tewrat, Încîl û Qur’an] terc. Mehmet Alî Sönmez, Ankara, 1998; Mûsa, ve Firewn, terc. Ayşe Meral, Îstanbul, 2002.

88 Mûmînûn, 23/12-16.

guhên me, destên me, lingên me, mejî û mixê me, qelb û dilê me...

**Welhasil;** temamê bedena me, meydaneke fereha tefekkurê ye, ji bo me hatiye dayîn, her wekî ku ew jî wiha gazî me dike:

Bi îbret-girtin û hestpê-kirin binêre, cenabê Heq Teala çawa endamên însan ji goşt, rehik û rayan pêkanîne û tenzîm kirine û ew anîne hal û rewşa sîstemeke wisan mûkemmel ku pevre bi aheng û tekûz dixebitin! Wî, serî gurover çêkiriye û li ser wî jî guh, çav, bêhvil, dev û qul û menfezên din vekirine... Wî dest û lingên însan dirêj aferandine, serê wan li telîyan û telî jî li mêvikan dabeş û teqsîm kirine... Wî, azayên hinavên wî yên wekî qelb û dil, mîde, kezeb, fatereşk, rûvî û malzarok di şekl û awayên çêtirîn û çawanîya mûnasibtirîn de aferandine. Hîç yek ji van azayan, ne hewante [pûç, nelazim] ye û pevre ne bêelaqe ne. Berovajî, her yek ji wan wezîfeyên wan yên zehf giring û mûhîm hene. Ew tev jî bi awayekî wisan hatine xuliqandin ku ji erk û wezîfeyên xwe re mûnasib û di cih de bin.

Paşê jî her yek ji van jî, li gorî xwe beş û qismên wan hene. Wek nimûne; tebeqên çavan hene û her tebeqekeke wî jî wesf û awayekî wê yê xusûsî hene. Heke yek ji wan xirab bibe, yan jî ew yekê ji wesfên xwe winda û berze bike, êdî ew çav dê bibe ku hew bibîne.

## Hestî

Pêkhatina hestîyan hêjayê ecêbmayîn û jixweçûnê ye: Cenabê Heq Teala, ev hestîyên evqas hişk, xurt û sağlem çawa ji dilopek nutfeya weza û tenik aferandine?! Paşê jî wî ew, çawa ew hestî jî xistine îskelêteke sağlem, xurt û hevkêş ku avahîya bedenê li ser pêyan digrin! Paşê wî, çawa di miqdarên curecur û pîvanên cuda cuda de şekl û awa daye wan û ew teqdîr kirine?! Hinek ji wan biçûk in, hinek ji wan mezin in, hinek ji wan dirêj in, hinek ji wan gurover in, hinek ji wan bi hinav in, hinek ji wan tije ne, hinek ji wan bi bere ne, hinek ji wan jî zirav in...

Însan, ji perçekekî hestîyan tenê pêk nehatiye. Hestî, bi movikan ve, bi mefselên [pêwendên] bi bizav ve hatine girêdan. Ji bo her yekî ji wan şekl û awayek hatiye dan û bexşkirin ku ji bo bizava ku pê radibin, mûnasib be. Mekanîzma rûn lê kirina movikan ewqas xarîqûlade û mûcîzewî ye ku ew bi awayekî tam bi her sê celebên rûn lêkirinê yên ku di teknolojîya îro de tên bikaranîn jî, nayê îzahkirin.

Vêga divê em bifikrin; heke movikeke di wicûda me de nexebite, gelo emê di jîyanê de bi tengasîyeke çi qeder mezin re rûbirû bên!

Heke Xuda Teala hestîyekî tenê di bedena me de zêde biaferanda, ev hestî dê bibûya sebebê nerehetî û jêdera êş û elemê ku ji bo însan divîya ew her were

jêkirin û avêtin. Bi berevajîyê vê, heke hestîyek kêm bûya, ji bo telafîkirina wî çi qeder lazim bû ku em cehd û hewlan serf bikin. Di gellek wextan de jî telafîkirina wî mûmkin nedibû.

Em bifikrin ku heke em nikaribin telîya beraneka xwe bikar bînin… Karên me dê çi qeder kulek û bêberhem bibe. Bi rastî divê em li ser vê mijar û rewşê baş bifikrin...

Hinek diran pehn in, bi kêrî hêrandinê tên. Hinek ji wan jî tûj û birrek in, bi kêrî qutkirin û perçekirinê tên.

Xuda Teala mesûlke aferandine ji bo hestîyan bi wan bide lebitandin. Miqdar û şeklên mesûlkeyan li gorî cih û îhtiyacên wan diguhere. Di çavan de gellek mesûlke hene. Heke yek ji wan nexweş bikeve, hemû sihhet û tendurustîya çavan xirab dibe.

Ev hemû, xarîqûladeyên dîtber in. Hinek sifet jî hene ku bi pênc hissan nayên têgihiştin û îdrakkirin; yanî ew xusûsîyetên manewî yên wekî xuy, şexsîyet, rewîşt/exlaq, wijdanê hene ku mahîyet û heqîqeta wan mûezzemtir e.

Xarîqûladeyên di bedena însan de, hunera Xuda û qudreta wî ya di dilopek av de ye. Dema însan li wêne û resmekî sipehî dinêre, ji meharet, hostatî, huner û zekaweta wênegir û ressamî re devqîç û heyran dimîne. Wî di çavê xwe de mezin dike. Halev e

ku tişta ressam çêkirî, ne peydakirina tiştekî ji tineyî ye, ji xwe ew tişt hebûne; lêbelê ew bi tertîbeke xusûsî tiştên wekî kağez, firçe û boyağê tîne cem hev, dîsa jî ew lewh û tabloyên ku ressamî ew çêkirine, ekskirin û dan xuyakirina wan netîceyên întîba û bandoran e ku ressamî ew ji wê alema ku Xuda Teala ew aferandine, wergirtiye.

Naxwe, madem em li eser û berhema ressamekî jî bi diqqet dinêrin û jê re heyran dimînin, ma ne lazim e ku em ji hunera bêhemta û îcada bênezîra cenabê Heq Teala, wî hunermendê mûtleq re heyran bimînin ku wîçawa **"însan"** ji dilopek ava menîyê aferandiye?

## Endam û Aza

Pêkhatina guhan, feydên bêhvilê, axaftina zimanî, cuda cuda derxistina wî ji bo her herfekî, xemilandina dev bi diranan, dîzaynkirina birêkûpêka diranan her wekî lipên duran ku bi ta ve hatibin rêzkirin, çêbûna nazik û hessasa têlên dengan... Cuda cudabûna dengê her însanekî.. Taybetmendîya koran ku her însanekî ji dengê wî nas dikin...

Por, reh, birh, mijgul... mîde, kezeb, gurçik, ra... Divê mirov li ser tevan zehf dûv dirêj tefekkur bike. Her yek ji wan çi qeder bi îlm û hikmeteke bilind hatiye aferandin û ew çi qeder bi hev re mûnasib wezîfeya xwe bicih tînin..

Gurçika me perçekekî biçûk yê goşt e. Lêbelê ew tiştên bijehr û bêjehr ji hev û din cuda dike. Ew tiştê bijehr ji bedenê diavêje derve. Ew tiştê bêjehr jî dîsa li bedenê vedigerîne. Ma di gurçikê de eql heye, ma kompîtur têde heye, ma laboratuvarên analîz û tehlîlan hene? Ev endam û azayê biçûçik, dema nexweş dikeve, em tev dizanin ka însan ji ber wî çi qeder dikeve tengasîyê. Wezîfeya ku ev gurçika pêncî gram goştî, tîne cih, ew makîneyên mezin û nehîtî nikarin bi awayekî temam bînin cih.

De ka em li destên xwe meyzînin! Ew dirêj hatine aferandin ji bo em karibin wî ji bo karê ku dixwazin dirêj bikin û bigihînin. Nava dest pehn e, li pênc telîyan hatiye parvekirin û her telîyek jî sê movikên wê hene. Çar telî li alîyekî ne, telîya din jî li alîyê din e. Telîya benanekê bi arîkarîya hemû telîyan ve diçe. Heke mirovên ku heta niha mirine û çûne û mirovên ku hê bên jî hemû werin cem hev, ji bo bixebitin û bi fikr û ramanên xwe yên hûr û kûr arîkarîya hev bikin da ku ji vî şekl û awayê ku vêga heye şekl û awayekî sipehîtir bidin pênc telîyan, dîsa ewê di vê de serfiraz nebin û hêza wan jî dê têra vê neke..

Însan, heke neynoka xwe jidest bide ku ew bêqîmettirîn azayê wî dixuyê, heke di bedena wî de cihek bixwere, ew dibe bêçaretirînê mexlûqan. Heke ew di vê xusûsê de ji dîgeran arîkarîyê bixwaze, ewê bes piştî tarîf û pênasîyeke dirêj û piştî çend tecrîbe û hewldanan karibe wî cihê ku dixwere, tesbît bike û

biser ve bibe. Halev e ku însan, bi destê xwe di dîtin û gihiştina cihê ku dixwere de hîç tengasî û zehmetîyê nakişîne. Heta ew di rewşa xewê de yan jî hişê wî tam ne li serê wî be jî, dîsa ew di cih de wî cihî dibîne.

Di ser de jî, besîttirîn bizav û hereketa ku em bi dest, mil û telîyên xwe dikin, di rastîyê de ew heta tu bibê bes, endazyarî û mûhendisîyeke hûr, asê û tevlîhev dixwaze. Wek nimûne; heke em wan robotên dest û milan tefekkur bikin, ew di roja me de wek mehsûl û berê teknolojîya bilindtirîn ji bo makîneyan hatine çêkirin û dîsa ast û sewîyeya xebata ku ew vêga gihanê ji azayên însan zehf li paş in ku bi azayê însan re nayên; dema em wan robot û azayên însan tefekkur bikin, ne pêkan e em, ji îlm û qudreta bêsînor û bêdawîya Xudayê xwe re, ewa ku di wicûd û bedena însan de nîşan daye, heyran û devqîç nemînin!..

Şair, her wekî ku hemû heyber û mexlûq jî wisan e, huner û senetê îlahî yê ku li ser“însan”î hatiye nîşan dan, ji bo çavên ku bixwazin heqîqetê bibînin û guhên ku bixwazin rastîyê bibihîzin, tim û daîm bi lîsanê halê xwe hunermend û senetkarê mûtleq îlan dike.. Ew vê rastiyê wiha çi sipehî vedibêje:

*Hebûna min ji bo hebûna xaliq û aferînerê min şahid e*
*Ji bilî vê şahidê, heke şahidê qewî hebin jî ew zêde ye.*

[Şînasî]

*“Hebûna min ji bo hebûna xaliq û aferînerê min sipehîtirîn delîl e. Heke çi qeder delîlên xurt û qewî yên din*

*hene jî, lêbelê ev delîl tenê kafî ye, têrê dike, îhtiyac û pêwîstî bi delîlên din nîn e.*"

**Şefqet û Merhemeta Xuda Teala**

De li şefqet û rehma cenabê Heq Teala binêrin, wî ji dema wîladet û jidayikbûnê derxistina diranan ji bo du salan dereng û texîr kirine. Lewra pitik, di dirêjahîya van herdu salan de ji şîrê dêya xwe pê ve ew bi mena rastî ğizaya xwe ji tiştekî din wernagire. Bi vê nêrînê, îhtiyaca wî bi diranan nîn e. Berevajîyê vê, di vê pêvajoyê de hebûna diranan dê ji bo dêya ku şîr dide pitikê xwe bibûya sersebebê îzdîrab û êşeke din.

Çi qas zarok mezin bibe, îhtiyaca wî ewqas bi xurek û ğizayê zêdetir dibe, êdî şîrê dêya wî têra wî nake. Vêca ew hest bi hewcebûna ğiza û xureka qewîntir û xurttir dike. Xwarin jî divê were cûtin û daqurpandin. Bi vê nêrînê, çêbûna diranên zarok tam di wextê xwe de dibe; ne berî wextê xwe û ne jî piştî wextê xwe çêdibe. Tam dema îhtiyaca wî bi diranan çêdibe, hingê diranên wî destpê dikin û dertên. Heke pêşîya vê wextê diranê wî derketana, ewê ji bo mêhtina şîr bibûna asteng. Yek ji wan karên ku divê mirov jê re heyran bimîne û bikeve dehşetê jî, ev e; Xudayê me ji van pirûyên [goştê li bin û li dora diranan] nerm wan [diran] hestîyên dijwar û hişk hem jî tam di wextê wan de derdixe!

Paşê cenabê Heq Teala hesteke wisan mûkemmela şefqet û merhemetê daye dê-bavan ji bo zarokê xwe xwedî bikin û lê binêrin. Xuda Teala di her karê xwe de xwedî hikmet e, heke wî şefqet û rehma xwe ji bo dilê dê bexş û lutf nekiribûya, kî dê tengasî û ezîyeta zarokî bikişanda?!

Bedena însan, ji bo tefekkurê qad û meydaneke dehşetdar û bi sosret e. Ew, ji bo nîşandana ezemet û mezinatîya xaliq û aferînerî, bariztirîn û dîyartirîn şahid e. Lêbelê însanê ku ji vê ğafil û bêxeber be, ew tim bi arzûyên nefsa xwe ve meşğûl e. Halev e ku heywan jî di karûbarên nefsanî de di ast û sewîyekeke wekî ya însan de ne.. Lêbelê ew mehareta ku însanî ji heywanan cuda dike û wî dixe eşrefê mexlûqatan, bi îbret nêrîna wî ya li melekûtê erd û asîmanan û ew merîfet e ku bi awayê tefekkur-kirina di xarîqûladeyên hunera îlahî ya di kaînat û însanan de, tê bidestxistin. Lewra evd çi qeder di vê merîfetê de kûr bibe, ew dikeve merteba melaîketên mûqerrebîn, heta ew ji wan jî bilindtir dibe. Hem jî ew di nav pêğember û siddîqan de di rewşeke ji Xuda nêzîk de, tê heşrkirin. Ev şeref û îzzet jî, ji bo wan ğafilên ku wek esîr û dîlên şehwet û arzûyên nefsa xwe wekî heywanan heta ji heywanan jî şaşomaşotir in, ne mewzûbehs [mijara axaftinê]e.[89]

89 Binêrîn, İmam Gazali, ihya, VI, 58-62.

## Rûyê Însan û Movikên Wî

Rojekê zilamek hate cem Ûmer kurê Xettab [xjr], jê re got:

"-Ez ji vê setrencê dimînim heyirî. Dirêjahîya depê wê zendek di zendekê de ye. Heke însan mîlyonek car li ser wê bileyize, leystika ku ew dileyize, bêşiwar ji leyistika din cuda dibe, hîç leyistikek naşibihe leyistika din!"

Ûmer [xjr] jê re wiha got:

"-Ya ji vê ecêbtir jî heye. Dirêjahîya rûyê însan bostek di bostekê de ye. Cihê aza û endamên têde yên wekî birh, çav, poz û dev naguhere. Digel vê jî, tu li şerq û ğerbê du kesên ku rûyên wan bi temasmî eynî be, nabînî. Qudret, ezemet û hikmeta wî Xudayê ku di vî perçê çermê biçûçik de ev ferq û cudahîyên bêhed û hesab nîşan dane, çi qeder mezin û bilind e!"[90]

Şair vê hikmetê destnîşan dike û dibêje:

*Kî ye, ew hunermendê ressamê ku xîjk li vî rûyî kişandiye?*

*Ma yek nîn e ku derbas bibe û ji eynê bipirse?* [Necîp Fazil]

Şûna telîya însan hê mûhteşemtir e. Îro ew wek şîfreyekê kompîtûr û derîyên ku bi şûna telîyê vedibin,

90 Razî, Tefsîr, IV, 179-180, Beqere, 2/164.

tên bikaranîn. Lewra şûna telîya her însanî ji ya însanê din cuda ye. Heta her şûna telîyeke însan ji şûna telîya wî ya din cuda ye.

Di dawîya sedsala 19'an de hate keşfkirin ku şûna telîyê, her wekî rêz û tertîbê ye, yan jî jimara tescîl û tomarkirinê ye û ji bo her însanî şeklekî wê yê xusûsî û cuda heye. Bi taybetî jî ew di asayîş û hiqûqê de ji bo tesbîtkirina nasnamê dest bi karanîna wê hatiye kirin. Di roja me de bi navê **"Daktîloskopî"** şağeke îlmê heye û ew şûna telîyan hûrdikole.

Cenabê Heq Teala ev taybetmendî ji bo însan bexş kiriye, di ayetên Qur'ana pîroza ku berî 1400 salan nazilkirî de bal kişandiye ser xarîqûlade ye îlahî. Wî ji me re daye zanîn ku roja qiyametê ewê mirovan dîsa ji nû ve sağ bike û ewê serê telîyan jî dîsa li rewş û halê wan yê berê vegerîne.

Xuda Teala di ayetên pîroz de wiha ferman dike, dibêje:

**"Ma ji însan were ku di piştî ji hev ketina wan de em nikarin hestiyên wî bicivînin? Erê, em dikarin movikên wan jî bînin rewşa wan ya berê."**[91]

Wekî ku em dibînin tim û daîm Qur'ana pîroz li pêşîyê diçe, zanist û îlmê beşerî li pey wê tê û tesdîqa wê dike.

91 Qîyamet, 75/3-4.

Eynî wekî şûna telîyê, çavên mirovan jî ji hev û din cuda ne. Êdî di şûna şîfreyan de, makîneyên ku tên xebitandin, kopîtûr û derîyên ku tên vekirin û xwediyê xwe ji çavên wî nas dikin, tên bikaranîn û her ku diçe ev teknîk di jîyana rojane de jî belav dibin.

Ew Xuda Teala yê ku di qadeke biçûçik ya ji 1 $cm^2$ jî biçûktir de ferq û cudahîyên bêjimar aferandine çi qeder bilind û mezin e!

## Mûcîzeya Genan

Keşifên nû di zanista Genetîkê de ev heqîqet derxistine holê; "ji bo her însanekî şîfrekeke wî ya genetîk heye, ew ji wî re taybet e, pê wî ji mirovên din vediqetîne."

Ji vê jî zêdetir, ev tiştê ku jê re **"gen"** tê gotin, ewqas biçûçik in ku mirov genê hemû candarên li sererdê kom bike û bixe qotîka terzî, ya ku ew ta û derzîyên xwe dixiyê, ew ji wan tije nabe.

Ev genên ku heta bi mîkroskopan jî nayên dîtin, ew di her şane û hucreya zindî de bicih dibin û xusûsîyeta her însan, heywan û giyayan didin wan. Ev qotîka terzî, dibe ku ewqas biçûçik were dîtin ku nikaribe xusûsîyetên nifûsa şeş mîlyar însan ya her ferdî cuda cuda di nav xwe de bihewîne. Lêbelê heqîqetên di vê xusûsê de ewqas rast in ku ji bo dudilî û bawernekirinê ti cih û mekanî nahêlin.

Zehf baş e, heke rewş wisan be, naxwe ev tiştê ku jê re “gen” tê gotin, çawa çêdibe ku ew taybetmendî û xusûsîyetên ewqas candaran di nav xwe de vedişêre ku jimara wan ewqas zehf e, heta ku ne mûmkin e, werin zanîn?! Çawa çêdibe ku di cihekî ewqas biçûçik yê ku nayê bawerkirin de xusûsîyetên her yekî heta bi psîkolojîya wî jî were parastin û mûhafezekirin?!

Çendîn mîlyon atomên ku di geneke ewqas biçûçika ku heta bi aletê mîkroskopê jî nayên dîtin de hatibin hebskirin û ew li sererdê temamê jîyanê bi awayekî qet‘î birêve bibe, heke ew berhema aferînerê xwediyê qudret, hikmet û îlmê bêdawî be, çêdibe; lê wekî din ew bi ti awayan çênabe û ji bo ti nezerîye û teorîyeke din jî îmkan û derfet nîn e..[92]

Çawa ku Xudayê me, ev heqîqet destnîşan kiriye û wiha gotiye:

**“Di bîra wan bîne, dema Xudayê te ji pişta Ademîyan zurriyeta wan girt û ew xwe bi xwe li ser hev kirin şahid: Ma ez ne Xudayê we me? Hemûyan got: Belê, em şehde didin. Ev şehdeyî, ji bo vê ye ku hûn roja qiyametê nebêjin: Em ji vê ğafil bûn.”**[93]

Lêbelê ev tezahur û dîyardeyên qudret û hunera îlahî û yên wekî van ku di serdema me de hatine keşfkirin, eqlê mirovan bêçare û heyirî dihêlin. Ji ber

92 Binêrin, Îlîm-Ahlak-Îman, berhevkar: M. Rahmî Balaban, sf. 189-190.
93 ‘Eraf, 7/172.

vê ye ku hê di sedsala 19'an de Zîya Paşa ev malika bi hikmet gotiye:

*Subhane men teheyyeret fî sun'îhî'l-uqûl*

*Subhane men bi-qudretihî yu'cîzû'l-fuhûl*

*"Ez Xuda ji hemû kêmasî û nuqsanîya paqij didêrim; ewê ku eqil li pêşberî hunerê wî heyirî û şaş mane. Ewê ku zana-bav jî li pêşberî şîyan û qudreta wî bêçare mane."*

**Kî Fabrîqe û Kargeha Bedenê Dide Xebatê?**

Divê însan, -di serî de jî ew bi xwe- tim û daîm bibîne ku temamê zindîyan û hemû tiştên ku li erd û asîmanan hene, îhtiyaca wan bi Xuda Teala heye. Divê ji hindikahî ve vê bibîne:

Temamê çalakî û failîyetên ku di wicûd û bedena me de pêktên hema bibêje temamê wan li derveyî vîyan û îradeya me tên birêvebirin û îdarekirin. Wek nimûne; nebz û avêtinên qelb û dilê me, hilm û nefes dan û standinên me, hemû failîyetên endam û organên me yên din, çalakîyên di hundurê şane/hucreyan de û ji hev xeberdarbûn û hevkarîya navbera van jî wisan e. Heke ji bo rojeke tenê birêvebirin û kontrola di sedan çalakî û bertekên bîyo-kîmyewî yên ku di şaneyeke yek-tevn de hene, yan jî di endam û organên ku di bedena însan de bi ahengeke mûkemmel û dehşetdar û li gorî programeke îlahî dixebitin, ji me re bên hiştin,

me dê nikarîbûye wan heta ji bo çend deqîqeyan tehemmul bikin, kî dizane dibe ku emê bibûna sersebebê çendîn, xirabbûn û jikar-ketinan?![94]

Ev çi îbreteke mezin e ku em li alîyekî fîlekî deh ton giran dibînin cenabê Heq Teala ew stûxwehr kiriye, êdî ew jî dibe tabîî û peyrewê zarokekî deh salî; li alîyê din jî Heq Teala bêçaretîya însan jê re wiha îfade dike; vîrûseke ewqas biçûçik aferandiye ku heta bi çavê xwerû û tazî nayê dîtin, ew cesed û gewdê ewqas xurt û dijwar li erdê dirêj dike û dixe nava nivînê!..

Naxwe, divê însan ti caran xwe bi wê qudret û qeweta ku Heq Teala jê re bexş û lutf kiriye, mezin neke û wê ji nefsa xwe re jî neke mal. Divê ew nîmetbexşê heqîqî yê wan jibîr neke. Divê ew tim di hundurê xwe de hest bi şukrê wî bike û divê fehm bike ku ew li hemberî qudreta îlahî ne tozek ji zerreyekê ye jî û ew xwe bispêre Heq Teala.

**Welhasil;** Em li vir, bi kurtasî li çend mijarên tecellîyatên qudret û hikmeta îlahî yên ku hed û hesabê wan nîn e û ew di însan de tên nîşandan, bisekinîn. Dema em di însan de tefekkur bikin, wê ji me re xuya bibe ku Xuda Teala gellek hikmet û sirr xistine wî. Heke ji bo her zerreyeke însan kitêbek were nivîsîn, laiqê wê ye.

94 Binêrin, Şakir Kocabaş, Kur'an'da Yaratılış s. 115.

## Însan Çima Hatiye Aferandin?

Gelo di vê dinyayê de wezîfeya heqîqî ya însanî çi ye? Ew însanê ku Xuda Teala ew di sipehîtirîn şekl û sûretan de aferandiye, ew mûkerrem û mûezzez kiriye û ew kiriye xuyageh ji bo îkram û lutfên îlahî yên ku ji wan re hed û hesab nîn e, erka wî ya rasteqîne çi ye? Gelo çi ji însan tê payin û hêvîkirin? Berpirsî û mesûlîyetên wî çi ne?

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**"Ma we guman dikir ku me, hûn bes beredayî aferandine û hûnê li me neyêne vegerandin?"**[95]

**"Min, cin û însan, sirf ji bo min biperêsin aferandine."**[96]

Însan, divê ji bo her şane û hucreyeke di laş û bedena xwe de bi hezaran car şukr bike. Divê ew vê şukrê jî, di awa û sûretên îbadet, sedeqe, wesîyetên bi heqîyê, wesîyetên bi sebrê û rabûna bi çêtirîn xêr û hesenatan, nîşan bide. Lewra her nîmetek bedel û hemberê wê heye û her nîmet jî şukrê lazim dike.

**Resûlûllah** [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dibêje:

"Ji bo her movikeke însan her roj sedeqekek lazim e. Arîkarîya zilamê ku dixwaze li heywanê xwe

95 Mû'mînûn, 23/115.
96 Zarîyat, 51/56.

siwar bibe, siwarkirina wî li heywanê wî, yan jî barkirina barê wî li heywanê wî sedeqekek e. Xebera xweş, her gava ku tu bimeşî û biçî nimêjê sedeqekek e. Nîşandana rê jî sedeqekek e."[97]

"Her roj ji bo her movik û her hestîyê we sedeqekek lazim e.. Hertesbîhek[subhanellah] sedeqeyek e. Her tehmîdek [el-hemdû lillah] sedeqeyek e. Her tehlîlek [laîlaheîllellah] sedeqekek e. Her tekbîrek [Ellahû ekber] sedeqekek e. Şîret-kirina qencîyê sedeqekek e. Şîyarkirina ji neqencîyê sedeqekek e. Ji ber van tevan ve kirina dureket nimêja dûhayê [tavê] çêdibe."[98]

Di rîwayeteke din de jî ev lê hatine zêdekirin: "Tu di navbera du mirovan de bi edaletî hukm bikî." û "her gava ku tu bimeşî û biçî nimêjê sedeqekek e. tu ezîyetê ji rê bavêjî sedeqekek e."[99]

Naxwe divê mirov hewl bide ji bo li vê dinyayê ji cenabê Heq Teala re bibe evdekî baş. Divê mirov heyateke tije îbadet, taet, xêr û hesenat bijî û bi awayekî baş xwe ji bo axretê amade bike.

97 Buxarî, Cîhad, 72. Binêrin, Muslim, Zekat, 56.
98 Muslim, Musafirîn, 84, Zekat 56. Binêrin; Buxarî, Sulh 11, Cîhad 72, 128.
99 Binêrin, Buxarî, Sulh 11, Cîhad 72, 128; Muslim, Zekat, 56.

## Karîna Çareserkirina Mûemmaya [Koremorîya] Mirinê

**Mûhemmed kurê Ke'b el-Qurazî** wiha dibêje: "Ez carekê li Medîna Mûnewwer çav bi Ûmer kurê Ebdûlezîz ketibûm. Ew çax, ew ciwanekî xwîngerm, sîpe û taze bû, ewdi nav xêr û xweşîyê de dijîya. Paşê, piştî ew bû xelîfe, ez çûm cemê, min destûr jê xwest û ez çûm hundur. Dema min ew dît ez heyirî mam û min şaşo maşo li rûyê wî meyzand." Wî ji min re got:

"-Ey Mûhemmed, çima tu wisan bi heyret dinêrî? Min jê re got:

"-Ey mezinê mûmînan, rengê we firîye çûye, bedena we perixîye, kerixîye, pora we sipî bûye û weşîyaye! Dema min hûn di vî halî de dîtin, min nekarî heyirî-mana xwe veşêrim."

Vêca Ûmer kurê Ebdûlezîz ji min re wiha got:

"-Ey Mûhemmed, heke dema ez di qebrê de bêm danîn bi sê rojan şûn de tu min bibînî, kî dizane tu dê çi qeder şaşo maşo û heyirî bimînî? Ew çax, dê bibe ku mîroyan çavên min derxistibin, çavên min bi ser hinarkên rûyê min de rijîyabin, devê min û bêhvila min ji xwîn û şij û edabê tije bûbin. Ha ew çax, tu dê hîç min nas nekî û tu dê zehftir şaşo maşo bibî. Vêga tu dev ji van berde, tu wê hedîsa ku Îbnebbas [xjr] ji

pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rîwayetkirî dîsa ji min re bibêje..."[100]

Însan, divê ji her tiştî zêdetir serencam û axreta xwe tefekkur bike: Gelo nefesa dawî dê çawa bibe, ewê di jîyana qebrê de li çi rast were û ewê li axretê jî di kîjan cihî de bibe? Ha ji bo însan mûhîmtirîn mechûl û nenasî ev in. Yanî fehmkirina sirra serpêhatîya navbera pêçekê heta bi tabûtê û têgihiştina hikmeta hatina vê dinyayê û ji vê derê jî derbasbûna uqba û axretê jî... Divê însan di dirêjahîya temen û emrê xwe de her hewl bide ji bo vê mûemma û koremorîyê çareser bike û bigihîje rizgarbûna ebedî.

Kurê Însan, pêşî divê fanîbûn û mirinê tefekkur bike. Lewra ev heqîqeteke qet'î ye:

"Her zindîyê li sererdê mirok e."[101]

Rojek tê ku siberoja wê hîç nabe! Ew roj, ji bo me tevan rojeke mechûl û pênezan e!

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**"Serxweşiya mirinê, bi fermana heqîyê va ye hat, di sağkirina piştî mirinê de guman nîn e. Hey însan ha ev e, ya ku tu ji wê direviyayî! Di Sûrê de hatiye pufkirin, ha ev e, roja ku soza wê hatiye dayîn."**[102]

100 Hakim, IV, 300/7706.
101 Rehman, 55/26.
102 Qaf, 50/19-20.

Her kes ji derîyekî ve, yanî ji malzaroka dêya xwe ve tê vê dinyayê. Ew heyata xwe li vê dinyayê dijî ku ew jî cihê pêşbirk û berberîyeke zehf zehmet e, astengdar e, tije hest û bizavên şehwanî, nefsanî û rûhanî ye. Piştî derbasbûnê ji wê derbasgehê, di dawîyê de ew ji derîyê qebrê ve derbas dibe, tê guhastin ji bo alema ebedî.

Ha ev dinya, wekî xaneke du-derî ye; însan ji derîyekî ve dikevin navê û ji derîyekî ve jê dertên. Ji serdema Adem bigre heta bi roja me, ew bêhijmar ji mirovan tije û mişt bûye û hatiye valakirin. Baş e, vêga ew li kuderê ne? Piştî midedekî emê li kuderê bin? Mechûl û pênezan e... Lêbelê ev der mûheqqeq e ku mirin, her dê were hem bi zaliman, hem bi mezlûman, hem bi abidan hem jî bi fasiqan bigre û wan bibe; vêga ew hemû li benda destpêka heyata ebedî ne ku ew Qiyamet e...

Heke em wiha bifikrin, ew cihê ku em pêlê dikin û jê derbas dibin, ew ji cesedê mîlyaran mirovan tije ye ku ew heta îro hatine dinyayê, mirine û bûne ax. Ew bûne her wekî ku bi mîlyaran sih bin û serê wan bi serê hev û din ve hatibe qerastin. Sibê emê jî bi emelên xwe re bikevin pêsîra axê, têde bên veşartin û di nav wê siha tîr de bihelin û bipalin. Piştî wê dê heyateke ebedî û rêwîtîya ber bi heta hetayê ve destpê bike. Naxwe em piçekê rawestin û bifikrin: Guherandina an û wextê bi ebedîyetê karê kîjan eqlî ye?!..

Xudayê me di ayetên pîroz de wiha dibêje:

**“Roja ku ew Qiyametê dibînin, ew dibin her wekî ku ji êvarekê, yan jî ji danê sibeheke wê pê ve li dinyayê nemabin.”**[103] Bi vî awayî dide zanîn ku dema mirov heyata dinyayê bi heyata ebedî qîyas bike, heta tu bibêjî bes, ew kurt e.

Şair jî her wekî ev heqîqet îzah kiribe, de binêrin ew yekûna heyata dinyayê çawa xulase û kurt dike:

*Ev emrê me yê nazenîn, wekî çav miçkirin û vekirinê,*
*Hat û çû, me nebihîst, wekî çûkekî ku danîbe û firîbe.*

[Aşiq Paşa]

Naxwe ma hemaqeteke [fehmkorîyeke] ji vê dehşetdartir dibe ku mirov vî sermayê emrê xwe yê evqas kurt her wekî ku hîç xilas nabe, wî beyhûde di ğefletê de derbas û xilas bike?

## Tefekkura Mirinê

Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] ferman dike; mirinê zehf di bîra xwe bînin û wî nedixwest ku em di dinyayê de ğerq û noq bibin.[104]

“Çi qeder ecêb e, hem jî çi nakokîyeke yeman e, mirovê ku alema berzexê bawer dike; lêbelê ew ji bo mala xwe xapandinê kar dike!”[105]

103 Nazîat,79/46.
104 Binêrin, Tirmizî, Zuhd, 4; Nesaî, Cenaîz, 3.
105 Beyheqî, Şûebûl Îman, 7, 843, reqem; 93501.

Însan, dema bifikre ku têkilîya wî dê ji dinyayê qut bibe, ewê bi emelê xwe re bi tena serê xwe bimîne; çi ew emelê wî xêr be, çi jî şer be û ewê hemberî emelê xwe yê ku li pêşîya xwe şandiye, bêkêmasî bibîne, hingê ewê xwe ji gunehan dûr bike û ewê ji bo emelê salih zehftir reğbet bike.. Yanî tefekkur-kirina mirinê, dibe wesîle û navgîn ji bo bi şiûrbûn, bi hestbûn, rêkûpêkîdana ji bo jîyanê û sipehîkirina axretê... Çawa em dibînin ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîseke şerîf de wiha dibêje:

*"Mirinê zehf di bîra xwe bînin! Lewra di bîra xwe anîna mirinê însan ji gunehan diweşîne û wî li hemberî dinyayê jî dike zahid. Heke hûn di zengînîya xwe de mirinê di bîra xwe bînin, ewê we ji afetên zengînîyê biparêze. Heke hûn di feqîrtîya xwe de mirinê di bîra xwe bînin, ewê we ji heyata we memnûn bike."*[106]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dîsa me ji bo tefekkurkirina mirinê teşwîq dike û wiha dibêje: *"Min serdana qebran li we qedeğe kiribû, lê destûra serdana qebra dêya wî ji Mûhemmed re hatiye dayîn, hûn jî serdana qebran bikin; lewra ew axretê tîne bîra we."*[107]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dibêje:

"Şermkirin ji Xuda çawa lazim be, wisan ji Xuda şerm bikin."

106 Suyûtî, Camîûs-Seğîr, 1, 47.
107 Tirmizî, Cenaîz, 60; Muslim, Cenaîz, 106.

Sehabî dibêjin; me jê re got; ya pêğemberê Xuda! Hemd ji Xuda re be, em jê şerm dikin. Wî ji me re got:

*"Ne ev e. Lêbelê şermkirin ji Xuda çawa lazim be, wisan mirov jê şerm bike, ev e; mirov serê xwe û endamên ku têde ne, biparêze. Mirov zikê xwe û endamên ku ew wan dihewîne mûhafeze bike. Mirov mirin û rizîna beden û hestîyan di bîra xwe bîne. Kî axretê bixwaze, ewê zîneta dinyayê terk bike. Kî van bike, wî şermkirin ji Xuda çawa lazim be, wisan ji Xuda şerm kiriye."*[108]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dîsa dibêje:

*"Mirinê zehf di bîra xwe bînin! Kîjan mirov mirinê zehf di bîra xwe bîne, Xuda qelbê wî sağ dike û mirinê ji wî re hêsan dike."*[109]

*"Kî xwe ji bo Xuda nizm bike, Xuda wî bilind dike. Kî xwe mezin bike, Xuda wî nizm dike. Kî îqtîsadê bike, Xuda wî zengîn dike. Kî mirinê zehf di bîra xwe bîne, Xuda ji wî hez dike."*[110]

Zilamekî ensarî hat, silav li pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] kir, paşê jê re wiha got; ya pêğemberê Xuda! Kîjan mûmîn çêtir e?

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

108 Tirmizî, Qîyame, 24.
109 Heysemî, ez-Zewaîd, cild, 10/325.
110 Heysemî, Mecmû-ûz-Zewaid, 10/325.

*"Exlaqê kîjanî ji wan xweştir be, ew çêtir e."*

Wî jê re got; kîjan mûmîn biaqiltir e?

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

*"Ewê ku zehftir mirinê di bîra xwe bîne û ewê ku ji bo piştî mirinê hazirîya xwe çêtir bike, ew biaqiltir in."*[111]

## Tefekkur-kirina Sehabîyên Kîram Ji Bo Mirinê

Ebûbekr [Xuda jê razî be] di xutbe-axaftineke xwe de wiha gotiye:

"Kanî ew însanên rû sipehî, ewên ku her kes ji wan re heyran dima li kuderê ne! Ew egîtên ku bi ciwanîya xwe ser xwe ve çûbûn li kuderê ne! Kanî ew hukmdarên ku bajarên bi îhtîşam ava kiribûn û çarteref û hawîrdorên wan jî bi sûrên bilind pêçabûn li kuderê ne! Kanî ew leheng û qehremanên ku li meydanên cengê meğlûbîyet û têkçûn nas nedikirin li kuderê ne! Zemanî ew hemû rizandin û bi erdê re yeksan kirine. Ew tev di tarîtîyên qebrê de hatine veşartin û çûne. Bilezînin, bilezînin! Berî dem bibûre eqlê xwe bînin serê xwe, gavek berî gavekê xwe ji mirinê û bi wêdetir re hazir bikin! Xwe xilas bikin, xwe xilas bikin!"[112]

Aîşe [Xuda jê razî be] wiha dibêje:

111 Îbnmaceh, Zuhd, 31.
112 Îbnûl-Cewzî, Zemmûl- Hewa, s. 668; Nedretûn-Neîm, III, 960.

“Carekê cehennem hate bîra min û ez girîm. Çi dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ez di vê rewşê de dîtim, ji min pirsî:

“-Aîşe, çi li te qewimîye?” Min jê re got:

“-Cehennem hate bîra min, ji lewma ez girîm. Ma roja qiyametê ferdên malbata we pêğemberan tên bîra we?”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha bersiva min da:

“-Sê cih hene, li wan deveran ti kes ti kesî nafikre:

1. Dema emelên wan li ber mêzînê tên kişandin lê hê ew nizane ka terazîya wî dê sivik were, yan jî giran were,

2. Dema deftera emelên wan tên dayîn heta neyê gotin: **“Ha ji te re kitêba min bixwîne!”**[113], heta ew bizane ka deftera emelê wî dê bi destê rastê wî, yan bi destê çepê wî, yan jî bi pişt wî ve were dayîn,

3. Dema pira sîratê li ser pişta cehennemê tê danîn. Li herdu alîyên pirê jî gellek çengal û strîyên dijwar hene. Xuda Teala ji mexlûqatên xwe kê bixwaze, bi van çengalan digre û diavêje cehennemê. Ha mirov nizanibe ka ewê ji van çengalan xilas bibe, yan na, ew ti kesî nafikre.”[114]

113 Haqqe, 19.
114 Hakim, IV, 622/8722.

Ûseyd kurê Hûdeyr [xjr] yek ji sehabîyên kîram bû, ew yek ji mirovên bêhnpak û bi fezîlet bû, wî tim wiha digot:

"Heke min bikarîya tim li ser yekê ji van her sê halan rawestim, bêşiwar ez ji cennetîyan dibûm:

1] Heke min bikarîya di wî haletê rûhî de rawestim ku ez Qur'anê dixwînim, yan jî ez li wê Qur'ana ku tê xwendin, guhdarî dikim.

2] Heke min bikarîya li ser wî halê ku dikevimê dema li sohbetên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] guhdarî dikim, rawestim,

3] Heke min bikarîya li ser wan hestên xwe yên ku dema beşdarî cenazeyekî dibim, rawestim. Erê, ez kengê beşdarî cenazeyekî bibim, ez difikrim û ji xwe bi xwe re dibêjim; "Gelo dema tu bimrî rewşa te dê çawa bibe, gelo dê çi ji te bikin û di dawîyê de tu dê ji bo kuderê werî şandin?!"[115]

### Feydeyên Tefekkur kirina Mirinê

Hedîsa Şerîf dibêje: **"Ji mirovan re wek nesîhet mirin kafî ye."**[116] Yanî ji bo mirovê ku tefekkur bike û îbret bigre, di mirinê de gellek ders û îbret hene.

115 Binêrin, Ahmed, IV, 351; Hakim, III, 326/5260.
116 Heysemî, Mecmûz-Zewaîd, Beyrût 1988, X, 308.

Serê nexweşîyên menewî, hezkirina pertalên berwext yên dinyayê, yên wekî mal, meqam, mertebe, lezzetên şehwanî û girêdana qelb bi van tiştan ve ye. Hezkirina dinyayê însan diajoyê ser hesed, kibr, rîya û temakarîyê. Ji bo xwe parastina ji van exlaqên xirab û van êş û nexweşîyên manewî, tefekkur kirina di mirin, qebr û rewş û halên axretê de yek ji bihaviltirînê dermanan e.

Ğaye û armanca esasî ya tesewwufê jî, ğalib û zalbûna li dijî nefsê ye, parastina wê ji xwedbînîya wê ye û deranîna hezkirina dinyayê ji dilê însan e. Ji ber vê sedemê, tefekkur kirina mirinê di gellek terîqetan de ji bo vê hedef û meqsûdê bûye esas û usûleke ku serî her lê tê xistin.. Murîd, dema wirdên xwe yên rojane îcra dike, bi qasî pênc, yan jî deh deqîqeyan mirinê difikre.

Di serdema Osmanîyan de ji bo hêsankirina hizr û tefekkura mirinê, qebristan li nav bajaran, yan li hewşa mizgeftan, yan jî li ber kevîya rêyan dihatin çêkirin.

Gergînekî Rojavayî vê rewşê dibîne, ew hew xwe digre û wiha dibêje: **“Tirk, bi mirîyên xwe re dijîn.”**

Zehf caran di bîra xwe anîna mirinê, berterefkirina arzûyên xwe yên nefsanî û xwe hazirkirina ji bo axretê, mirov ji poşmanîyên di nefesa dawîya ku kezebê li mirov dihelîne de, mûhafeze dike. Cenabê Heq Teala poşmanîya kûra ku însan hestpê dike dema

şîyar dibe û dema di kêlîk û ana mirinê de ji ğefleta dinyayê şîyar dibe, ji me re wiha dide zanîn û dibêjin:

**"Beriya ku mirin, were yekî ji we û ji nû ve bibêje: Xudayê min! Çima heta demeke nêzîk te mirina min neda paş da ku min sedeqe bidaya û ez bibûma ji qencîkaran!"**[117]

Ha ji bo mirov vê poşmanîya tehl û vê bê bêçaretî û jana dil nejî, divê mirov di zemanê xwe de şîyar bibe û hê firsend ji dest mirov neçûyî jî, mirov xwe ji bo heyata ebedî hazir bike.

Hesenê Besrî [rehma Xuda lê be] beşdarî cenazekekî bûbû. Piştî karên definkirinê xilas bûn, wî ji bo merivek li cem xwe wiha got:

"- Ev merivê ku wefat kirî, gelo vêga difikre ku vegere dinyayê, emelên salih ên xwe û zikrên xwe zêdetir bike û zehftir ji gunehên xwe îstiğfar bike?" Wî jê re wiha got:

"Erê, helbet ew wê difikre."

Vêca Hesenê Besrî jê re wiha got:

"-Naxwe çi li me qewimîye ku em wekî wî nafikrin?"[118]

117 Mûnafîqûn, 63/10.
118 Îbnûl Cewzî, el-Hesen'ûl-Besrî.

## Xwe Amadekirina Ji bo Dehşeta Mirinê

**Hesenê Besrî** [Rehma Xuda lê be] wiha dibêje:

"Du şev û du roj hene ku mexlûqatan, ti şev û rojên wekî wan hîç nebihîstine û nedîtine:

**Şeva yekê;** ew şev e ku tu bi ehlê qebrê re dimînî. Berîya wê tu hîç bi wan re nemabûyî.

**Şeva duduyan;** ew şeva ku sibehroja wê qiyamet e ku êdî rojek destpê dike ku dê şeva wê jî nebe.

Herçî ew herdu roj in ku ji hemû rojan bi dehşettir in; **Roja yekê;** ew roj e ku xebergihanek ji teref Xuda Teala de tê cem te, ji te re dide zanîn ka ew, ji te razî ye, yan ne razî ye, tu dê biçî cennetê, yan jî tu dê biçî cehennemê.

**Roja duduyan** jî; ew roj e ku deftera emelên te dê bi destê rastê te yan jî bi destê çepê te ji te re were dayîn û tu dê here hizûra cenabê Heq Teala.[119]

Ji bo însan îmtîhana ji hemû îmtîhanan mezintir û belaya ji hemû belayan bi dehşettir, mirin e. Lêbelê belaya ji vê jî xirabtir ev e; mirov ji mirinê bêxeber bijî, mirov wê ji bîra xwe dûr bike û mirov emelên layiqê Heq Teala neke. Ji bo mirovê eqilmend tişta lazim ev e; bila mirov berîya **mirin** were, hazirîya wê bike û bila mirov nefsa xwe ji exlaqên xirab jî paqij bike.

119 Binêrin; Ebûl Ferec, Ebdûrrehman, Ehwalûl Qubûr, s. 156; Îbnûl Cewzî, ez-Zehrûl Faih, s. 77.

**Şêx Seʻdî** yê **Şîrazî** wiha dibêje:

*"Bira, di dawîyê de tu dê bibî ax!*
*Naxwe berî tu bibî ax, wekî axê nefsbiçûk bibe!*

**Ûmer** [Xuda jê razî be] dibêje:

*"Hesabê ji xwe bipirsin berî hesab ji we were pirsîn. Xwe [bi emelên salih û sipehî] ji bo erza [roja ku hûnê derkevin hizûra Xuda Teala û hûnê li cenabê Wî bên erzkirin] mezintirîn bixemilînin! Kî hê li dinyayê hesabê ji xwe bipirse, roja qiyametê dê hesabê wî sivik be."*[120]

Dema bedena fanî [mirok] ya me di qebrê de tê veşartin û bi axê sipartin, hingê ewladên me û malên me li pey me dimînin û vedigerin. Lêbelê em bi kar û emelên xwe re di pêsîra axê de tên veşartin. Li wir, bi kefenê me re bedena me jî dibe ax. Li pey wan, bes emelên salih ên me bi me re dibin.

**Îmam Ğezalî** wiha dibêje:

"Di dema mirinê de sê xusûsîyet bi mirov re dimînin:

**1]Paqijîya Qelb** e, xwerûbûn û temîzbûna dil ji qirêjên dinyayê ye. Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

قَدْ أَفْلَحَ مَنْ زَكَّاهَا

120 Tirmizî, Qiyame, 25/2459.

**“Kî nefsa xwe** [ji xirabîyan] **paqij kiribe, ew xilas bûye.”**[121]

**2]Hogirîya Bi Zikrê Xuda** ye. Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

أَلاَ بِذِكْرِ اللَّهِ تَطْمَئِنُّ الْقُلُوبُ

**“Şiyarbın! Dil bi zikrê Xuda aram dibin.”**[122]

**3]Hezkirina mirov ji Xuda** ye: Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

قُلْ إِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللَّهَ فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمْ اللَّهُ
وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَاللَّهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ

**“Bibêje: Heke hûn ji Xuda hez dikin, li pey min werin, Xuda jî dê ji we hez bike û ewê li gunehên we bibûre. Xuda Ğefûr** [gunehbexş] **û Rehîm** [dilovîn] **e.”**[123]

Paqijîya Qelb, bi merîfetê, yanî bi naskirina Xuda Teala ya di qelb de mûmkin dibe. Merîfet jî di encama meşğûlbûna berdewama bi zikr û tefekkurê tê bidestxistin û hasil dibe. Ha ev her sê sifet, wesfên xilaskar in.[124]

121 Şems, 91/9.
122 Re‘d, 13/28.
123 Alî Îmran, 3/31.
124 Rûhû’l-Beyan, XI, 274.

Heke însan karibe ji bo "sibê" hazirîyê bike, ew dest bi sipehîkirina mirinê dike. Êdî ew kes ji mirinê natirse.

Çawa **Bişr kurê Haris** wiha dibêje:

"Çi xweş mal e qebr, ji bo mirovê ku îtaeta Xuda dike."[125]

**Mewlana** çi xweş dibêje:

*"Kuro! Mirina her kesî bi rengê wî ye. Mirin ji bo mirovên ku dijminahîya mirinê dikin, jê direvin û jê hez nakin; bêyî ku bifikrin ew navgîn e ji bo însan bigihîne Xuda Teala, dijminekî tirsnak dixuyê. Mirin, ji bo mirovê ku dostanîya wê dikin û jê hez dikin dost dixuyê.*

*Ey canê ku ji mirinê ditirse û jê direve! Heke tu eslê kar û xebera rast bixwazî, di rastîyê de tu ji mirinê natirsî; lê tu ji xwe ditirsî.*

*Lewra ewê ku tu di eyne û mirêka mirinê de dibînî û jê ditirsî, ew ne çehreya mirinê ye, ew rûyê mekrohê te ye. Rûhê te dişibihe darekê. Mirin jî pela wê darê ye. Her pel, ji cinsê darê xuya dibe.."*

**Welhasil;** mirina me û heyata me ya qebrê, ku ewê heta qiyametê berdewam bike, ewê li gorî rewşa me û emelên me yên dinyayê pêk bên.

Ji ber vê ye ku Xuda Teala di gellek ayetên pîroz de rewş û halên dinya û axretê ji me re eşkere dike. Ew ji me dixwaze em bifikrin ku zewala dinyayê her

125 Komîsyon, Nedretûn-Neîm, III, 963; Ebû'l-Ferec Ebdûrrehman, Ehwalû'l-Qubûr, s. 155.

dê were, ewê rojekê bipeqe û tine bibe. Divê em xwe ji xapandin û ji rêderanînên wê dûr bikin. Ew ferman li me dike ku em di axretê de bifikrin ku ew rojek piştî rojekê her ji me nêzîk dibe, axret jî her dê ebedî dewam bike. Ew ferman li me dike ku em berê reğbeta xwe bidin wê û dilê xwe bixinê.

Ji ber vê sedemê, divê însan berî mirinê, xwe bi tobekeke nesûh ji hemû gunehan vegere, temîz bike û di xusûsa îtaetkirina emr û nehyên Xuda Teala de jî qusûr û kêmasîyên xwe telafî bike. Dîsa divê ew yek bi yek maf û heqê mirovên ku zulm li wan kiribe, li wan vegerîne. Yanî divê ew ji mirovên ku bi zimanê xwe sixêf, çîr, îftîra, ğeybet û tinaz li wan kiribin; bi destê xwe li wan dabe; bi qelbê xwe jî zenna xirab li wan kiribe, helalkirinê ji wan tevan bixwaze, berî mirinê jî xwe ji heq û deynên li ser xwe, temîz bike..

Însanê ğafil ji ber ku heqê dîgeran xwaribe dibe ku ew li dinyayê keyfxweş bibe; sefaleta [nizmbûn û nehêjabûna] xwe jî seadet [şadbûn û bextewarî] zen bike. Lêbelê sibe dema terazî û şehîna edaletê were damezirandin û dema jê re were gotin; **tu mufliselkî heqîr** [nehêja], **bêçare û feqîr î. Êdî tu li vir nikarî ti heqekî bi şûn de îade bikî û tu nikarî uzr ji ti kesî bixwazî!** Hingê ewê hest bi poşmaniyê bike û ti kes nikare texmîn bike ka ewê çi qeder poşman bibe.

Dema mirina xelîfeyê Emewî **Ebdûlmelik kurê Merwan** tam nêzîk bûbû, wî li taxeke kenarê Şamê cilşoyek dît ku wa ye, wî cil li destê xwe pêçabûn û li

kevirê şûştinê didan. Vêca wî hesabê dehşetdarê axretê tefekkur kir, axînek ji dilê xwe kişand û wiha got:

"-Xwezî ez jî cilşo bûma! Min roj bi roj ji ked û kesba destê xwe bixwaraya û ez di bara ti karekî dinyayê de nebûma xwediyê xeberdanê."[126]

Divê mirov dehşeta mirinê bifikre, xwe jê re amade bike lêbelê ti caran jî hêvîya xwe ji rehma cenabê Heq Teala qut neke.

**Ûqbe el-Bezzar** wiha dibêje:

Bedewîyekî, cenazeyek dîtibû ku ew dibirin defin bikin. Wî berê xwe dayê û jê re wiha gotibû;

"-Ez te tebrîk dikim, ey cenaze, xwezîya me bi te!" Min jê pirs kir û jê re re got:

"-Tu ji bo çi wî tebrîk dikî?" Wî ev bersiv da:

**"-Ezê çawa wî şexsê ku dibin hebisxaneya** [goristanê] **Zatê xwediyê camêrî û keremê tebrîk nekim? Wî dibin cem Zatekî wisan ku li mêhvanxaneya wî îkrama wî mûezzem û efûya wî jî zehf mezin e.."**

Her wekî ku heta wê gavê min xebereke wiha xweş û sipehî nebihîstibû.[127]

126 Îmam Ğezal, Îhya, VI, 114.
127 Ebû'l-Ferec Ebdûrrehman, Ehwalû'l-Qubûr, s. 155.



# TEFEKKUR KİRİNA Dİ QUR'ANÊ DE

Qur'ana pîroz ji bo bawermendên ehlê wijdan û ehlê dilan derîyekî mûhteşem û vekirî ye da ku xwe di dinyaya tefekkurê de kûr berdin. Ew asoyeke fereha tefekkurê ye. Ew lîsanê erd û asîmanî ye. Ew xezîna feyzeke bêdawî ye ku bi beyanatên xwe yên bi hikmet xurek û ğizaya rûh e. Ew mûcîzeyeke beyanî ye ku ji însan re hatiye lutfkirin.

Ji 1400 salan ve di lîteratura Îslamî de bi hezaran kitêb hatine nivîsîn ji bo "kitêb"ekê fehm bikin, di wê de kûr bûn û hê ji nêzîk ve naskirina "însan" û di wî de fanî-bûn e.

# TEFEKKUR KİRİNA Dİ QUR'ANÊ DE

Însan, bi aferandina xwe ji tefekkurê re meyldar e. Lêbelê îhtiyaca însan bi rêberekî heye ji bo eqlê wî ji hesabên tengên nefsanî xilas bike û berê wî bide ser heq û xêrê. Rêber û rêzanê ji hemû rêber û rêzanan ewletir jî kitêba Xuda Qur'ana pîroz û tefsîra wê ya fiêlî û kiryarî ronahîya çavên me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] e.

Bi taybetî Qur'ana pîroza ku wek rehm ji însanîyetê re hatiye şandin, ew ji bo mûmînên ehlê dil derîyekî bi îhtîşam û vekirî ye da ku ew xwe berdin kûrahîya dinyaya tefekkurê. Ew ufûq û asoyeke fereha tefekkurê ye. Ew lîsan û zimanê erd û asîmanî ye. Ew xezîna feyzeke bêdawî ye ku bi beyanatên xwe yên bi hikmet xurek û ğizaya rûh e. Ew mûcîzeyeke beyanî ye ku ji însan re hatiye lutfkirin.

Qur'ana pîroz şerha însan û kaînatê ye. **Kaînat, însan** û **Qur'an** sê alem in ku pêbendê hev in û bi awayekî zehf sipehî hev û din şerh û îzah dikin. Kî xwe

di Qur'anê de kûr berde, ewê xwe û lutfên Rebbê xwe bixwîne; ewê destpê bike rûpelên bi hikmetên kaînatê wergerîne. Çendîn sirrên îlahî jê re eyan dibin û ji dilê wî pencere ber bi yên din ve tên vekirin.

Qur'ana pîroz derman e, ji bo hestên xwedbînî û nefsanî yên ku ji hêla manewî ve însan ber bi helakê ve tehf didin. Her wiha çareserîya xilasbûna ji bê-îffetîya ku însan ji heywanan jî berjêrtir dike jî dîsa di Qur'anê de ye. Dîsa di Qur'anê de ye wergirtina tedbîrên wacib ji bo histên edaletê bi zulmê wernegerin.

**Welhasil;** mezintirîn receteya seadet û bextewarîyê ya ku di her hal û karî de îhtiyaca kurê însan pê heye dîsa di Qur'ana pîroz de ye.

## Xuda Qur'an Hînî me dike

Qur'ana pîroz, mezintirîn xelat û hedîye ye ku Xuda Teala ew ji kerema xwe ji beşerîyetê re lutf û bexş kiriye. Di ayetên pîroz de wiha tê gotin:

**"Rehman, Qur'an li însan daye hînkirin, însan di awayê sipehîtirîn de aferandiye, ew hînî axaftinê kiriye."**[128]

Cenabê Heq, wek tecellîyateke mezina rehma bêdawîya xwe Qur'an li însan daye hînkirin, bi vê navgînê gellek sirr û hikmet ji însan re bexş û lutf kirine.

128 Rehman, 55/1-4.

Naxwe divê însan pêşî Qur’anê hîn bibe û di çarçoveya wan ferman-name û telîmatên îlahî de alema xwe ya derûnî û navxweyî keşf bike. Paşê divê ew her hewlê bide ji bo di her hal û hereketên xwe de, di her rewş û bizavên xwe de bibe Qur’aneke zindî ya ku li sererdê birêve diçe. Paştir jî divê însan dîsa her hewlê bide ku wê bi ziman û lîsanekî zelal, fesîh û bi belağet bigihîne temamê beşer û însanîyetê û wê ji wan re teblîğ bike.

## Kitêb Hemû Ji bo Kitêbekî Ne

Di lîteratura Îslamî de ji 1400 û hinek salan ve bi hezaran berhem hatine nivîsîn ji bo **“Kitêb”** ekê fehm bikin û di wê de kûr bibin û hê bêhtir ji nêzîk ve “însan” nas bikin. Heke temamê darên li sererdê qelem, hemû behr û derya jî hibr û murekkeb bûna, [mirov ew hikmet û heqîqetên wê bi wan qeleman binivîsîna] dîsa ne mûmkin bû mirov bikare hemû hikmet û heqîqetên ku Qur’ana pîroz wan di nav xwe de dihewîne, bijimêre. Cenabê Heq Teala wiha dibêje: **“Heke darên ku li sererdê hene qelem bûna, derya jî hibr bûna û heta heft deryayên din jî li wê bihatana zêdekirin dîsa gotinên Xuda dê xilas nebûna. Bêguman Xuda serdest û xudan hikmet e.”**[129] Şîfreya hemû zanist, îlm û hikmetan di wê de ye. Dîsa kilîla dilşadî û seadeta herdu cîhanan di wê de ye.

129 Binêrin; Luqman, 31/27.

Qur'ana pîroz her tim li pêş diçe, zanist û îlmên beşerî jî her ji paş wê ve jî wê dişopînin û wê taqîb dikin. Her îcad û keşfa îlmî û zanistî, rasteqîne û heqîqetên Qur'anê tesdîq û tefsîr dikin.

Cenabê Heq Teala wiha ferman dike: **"Emê hê delîlên xwe di asoyan; erd, asîman, cîhan û welatan de û di nefsa wan bi xwe de jî nîşanî mirovan bidin da ku ji wan re tam eşkere bibe ku ev Qur'an heq e. Ma ne bes e ku Xudayê te li ser her tiştê şahid e.."**[130]

Çi qeder lêkolîn li ser Qur'ana pîroz werin berdewam kirin, mûcîzeyên wê yên nû jî her dê zuhûr û xuya bibin. Çawa pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] daye zanîn; alim ji Qur'ana pîroz têr nabin, ew çi qeder were dubarekirin tiştekî ji tazebûna xwe winda û berze nake û ew alîyên wê yên ku însan heyirî dihêlin jî hîç xilas nabin.[131]

## Divê Qur'ana Pîroz bi Tefekkur Were Xwendin

Alimên Îslamê dibêjin; Meqsed ji xwendina Qur'anê, tefekkur kirina hikmet û maneyên wê û emel kirina bi mûcibê fermanên wê ye.

Însan ji bo mufekkîreya/hêza hizirîna xwe tiştekî wekî xwendina Qur'ana pîroz bi feydetir û bihaviltir

130 Fussîlet, 41/53.
131 Binêrin; Tirmizî, Fedaîlû'l- Qur'an, 14; Darimî, Fedaîlûl-Qur'an, 1.

nîn e. Lewra Qur’ana pîroz kelamê Xuda ye; ewê ku hemû meqam, cih, rewş û halê mirovan dizane. Yanî Qur’ana pîroz eyne û datîne ber mirov, bi vî awayî jê re derfetan temîn dike da ku ew bi awayê rasttirîn xwe nas bike. Ji ber vê sedemê, bila însan dubare dubare zehf Qur’anê tîlawet bike, bixwîne û bila tefekkur bike, bibêje; gelo mirad û meqseda Xuda Teala di vê rave û beyana wî de çi ye.

Bi vî awayî, bi tefekkur û tedebbur xwendina ayeteke pîroz ji xwendina xetmeke bêtefekkur û tedebbur çêtir e. Lewra di her peyv û kelîmekeke Qur’anê de ewqas raz, hikmet û sirr hene ku ew nayên hed û hesabê. Însan bes dikare bi qelbekî safî û bi dilekî tenik, yên ku bi tefekkureke hûr, bi exlaqekî bilind û bi emelê salih qezenc kirine, wan sirran fehm bike û bi ser wan ve bibe.

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**“Me têde ayetên şkere anîne xwarê da ku hûn di bîra xwe bînin, şîret bigrin.”**[132]

**“Ev Qur’an kitêbeke pîroz e! Me ew ji te re nazil kiriye da ku mirov ayetên wê bifikirin û xwedî-‘eqil ji wê şîret bigrin.”**[133]

**“Ma ew li şîretên Qur'anê nafikirin? Yan jî li ser hinek dilan kilîlên wan hene?”**[134]

132 Nûr, 24/1.
133 Sad, 38/29.
134 Mûhemmed, 47/24.

Hinek mirovan ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pirsîbûn:

"-Ji bo tîlaweta Qur'anê kîjan deng û kîjan qîraet sipehîtir e?" Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev bersiv da:

*"-Deng û qîraeta wî kesê ku dema tu Qur'an xwendina wî dibihîzî, tu hestpê dikî ku ew ji Xuda ditirse."*[135]

Xwendina Qur'anê di serê wan karan de tê ku Şeytan wesweseyan dixe navê. Lewra ew kesê ku Qur'anê bixwîne, we'd [peyman] û we'îdên [tehdîd û gefên] wê û ayetên eşkere yên wê û şîrove û şerhên wê difikre, bi keyf, reğbet û îştiyaqeke mezintir berê xwe dide ser emelên salih. Ewê hîn zehftir xwe ji tiştên bişubhe û heraman vede û bide paş. Ji ber ku bi vî awayî xwendina Qur'anê bi fezîlettirîn emelê salih e, Şeytan bi her hêz û qeweta xwe kar dike ji bo însan ji Qur'anê dûr bike. Li ser esasê vê hikmetê, berî tîlaweta Qur'anê ferman li însan hatiye kirin ku ew **îstîaze** bike, yanî bibêje; أعوذ بالله من الشيطان الرجيم Çawa ku di ayeta pîroz de jî wiha tê gotin: **"Dema tu Qur'anê bixwînî, xwe bi Ellah, ji Şeytanê qewirandî biparêze!"**[136]

135 Darimî, Fedaîlû'l-Qur'an, 34.
136 Neml, 16/98.

## Pêğemberê Xuda Qur'ana Pîroz Çawa Dixwend?

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] Qur'ana pîroz bi weqûrî, sergiranî, yek bi yekî û di nav hestên kûr de dixwend. Wî li ser maneyên ayetan tefekkur dikir û fermanên wê jî li ser jiyana xwe derhal tetbîq dikir. Dema ew dihat ser ayetên ku Xuda Teala tesbîh dikirin, wî bi îfadeyên wekî "subhanellah" Xuda Teala ji hemû nuqsanî û kêmasîyan tenzîh dikir û ew pak didêrîya. Dema ew dihat ser ayetên ku dûa di wan de hebûn, wî bi wan ayetan mûnacat bi Xuda Teala re dikir. Dema wî ayetên ku behsa xwe avêtin ber penaha Xuda Teala dixwendin, di cih de wî xwe diavêt ber penaha Xuda Teala.[137]

Carina wî ewqas dehnê xwe dida ser ayetekê ku heta sibehê wî li ser wê ayetê di halê tefekkur û nîyazê de dima.

**Ebûzerr** [Xuda jê razî be] wiha diguhêze: Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] şevekê heta sibehê di qîyamê de ev ayeta ha dubare dikir û wisan ma:

إِنْ تُعَذِّبْهُمْ فَإِنَّهُمْ عِبَادُكَ وَإِنْ تَغْفِرْ لَهُمْ فَإِنَّكَ
أَنْتَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ

137 Binêrin; Muslim, Mufessirîn, 203; Nesaî, Qîyamu'l-Leyl, 25/1662.

**"Heke Tu ezabê bidî wan, ji xwe ew evdên te ne. Heke Tu li gunehên wan jî bibûrî, bêguman her tu yî, destbilind, yê xudan hikmet."**[138]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dîsa rojekê bi ayeta pîroza li jorê ayeta: **"Xudayê min! Bêguman wan pirr kes ji mirovan ji rê xistine. Naxwe kî, li pey min were, ew ji min e. Kî jî li ber min rabe, bêguman tu, her gunehbexş û dilovîn î."**[139] xwend, paşê herdu destên xwe bi jorê ve rakirin û wiha got:

*"Xudayê m! Ummeta min, ummeta min!"* Bi vê dûayê dest bi lavlav û bergerînê kir. Li alîyê din jî ew digrî.

Vêca cenabê Heq Teala got:

*"-Cebraîl! Gerçî Rebbê te her tiştî bêhtir dizane lêbelê [ji bo însan jî bizanin] here, ji Mûhemmed bipirse; çima ew digrî!"*

Cebraîl [silavên Xuda lê bin] hat. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got; ez bi sebeb pêxav û metirsîyên ku di bara ummeta xwe de hestpê bikim, digrîm.

Vêca Xuda Teala jî wiha got:

138 Maîde, 5/118, Nesaî, Îftîtah, 79; Ehmed, V, 156.
139 Îbrahîm,14/36.

*“-Ey Cebraîl! Here cem Mûhemmed û vê mizgînîyê bigihînîyê; emê te di bara ummeta te de te razî bikin û emê te ğemgîn nekin.”*[140]

Ha pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] evqas ji ummeta xwe re bi merhemet bû û dilê wî evqas bi ummeta wî ve bû. Divê em vê hedîsa şerîf tefekkur bikin û mûhasebe bikin ka em çi qeder jê hez dikin û em wek delîla vê hezkirina xwe ji wî jî, dikarin çi qeder sunneta wî ya Senîyye di jiyana xwe de tetbîq bikin.

**Ebdûllah Kurê Mesûd** [Xuda jê razî be] wiha dibêje:

“*-Pêğemberê Xuda* [dirûd û silavên Xuda lê bin] rojekê ji min re got; *“tu dikarî Qur’anê ji min re bixwînî!”* Min jê re got;

*“-Ey Pêğemberê Xuda! Qur’an ji te bi xwe re hatiye şandin vêca ma ezê Qur’anê ji te re bixwînim?!”*

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji min re got:

*“-Ez hez dikim Qur’anê ji dîgerê xwe jî guhdarî bikim.”* Vêca li ser daxwaza wî min jî destpê kir Sûretê en-Nîsa jê re xwend heta ez giham ayeta 41:

**“Qey rewşa wan dê çawa bibe, dema em ji her ummetê re şahidekî bînin û te jî li ser van yên ha bi şahidî bînin?!”**[141]

140 Muslim, Îman, 346.
141 Nîsa, 4/41.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji min re got:

*"Vêga ev qeder bes e!"*

Min meyzad ku çi meyzînim, min dît ku wa ye ji çavên mûbarekên wî hêstir dibarin.[142]

Aîşe [Xuda jê razî be] wiha di bara tenikbûna dilê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û ufûq û asoya tefekkura wî de menzere û dîmeneke wiha neql dike û diguhêze: "Şevekê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji min re got:

*"-Ey Aîşe! Heke tu destûr bidî, ezê şevê bi îbadet-kirina ji Rebbê xwe re derbas bikim."* Min jî jê re got;

*"-Qesem bi Xuda ye, ez pirr dixwazim bi te re bibim; lêbelê ez ji tiştê ku te keyfxweş dike, hîn bêhtir hez dikim."*

Paşê ew rabû, rind desmêj girt û rabû ser nimêjê. Ew digrî... Ew, ewqas girî heta ku cilê wî, riha wî ya mûbarek û cihê sicûda wî jî şilopilo bû. Dema ew di vê rewşê de bû, Bilal [Xuda jê razî be] hat ji bo banga sibehê bide. Çi dema wî dît ku mezinê me digrî, jê re got:

*"- Ya Resûlellah! Xuda Teala gunehên te yên bûrî û yên ku hê bên jî tev efû kirine, vêca çima tu digrî?"*

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

142 Buxarî, Tefsîr, 4/9; Muslim, Musafirîn, 247.

*"-Ma bila ez ji Xuda re nebim evdekî şukrdar? Ez bi Xuda kim; îşev ayetên wisan ji min re hatin xwarê; xwelî li wan kesan be ku wan bixwîne û li ser wan tefekkur neke!"* û wî ev ayetên pîroz jî li wan îlawe kirin:

**"Bi rastî di aferandina erd û asîmanan de û di kurtkirin û dirêjkirina şev û rojê de ji bo xwedî hişan hemin nîşan hene. Ha ew in, yên ku rabûyî û rûniştî û li ser teniştên xwe gêrkirî Xuda di bîra xwe tînin, navê wî her dibêjin û di aferandina erd û asîmanan de difikirin û dibêjin: Perwerdegarê me! Te eva ha pûç neaferandiye, vêca me ji azara êgir biparêze!"**[143]

Ew şeva ku ev ayetên pîroz têde hatin xwarê, heta sibehê hêstirên her wekî lip û daneyên durr û mercanan ji çavên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] barîn ku dilê stêran bibije wan. Her wiha Xuda hez bike, ew rondik û hêstirên mûmînan; yên ku dema ew di tecellîyatên qudret û ezemeta îlahî de tefekkur dikin de dibarin, ewê bi lutf û rehma Xuda bibin rewş û zîneta şevên fanî, ronahîya tarîtîyên qebrê û xwîsîtî û şebnema bexçên cennetê...

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di axaftina xwe ya di bara eşkerekirina fezîletên Qur'ana pîroz, wacibbûna xwendina wê ya bi tefekkur û tedeburkirina raz û sirr û maneyên wê de wiha dibêje:

143 Al-î Îmran, 3/190-191 (Îbn-û Hibban, Sehîh, II, 386; Alûsî, Rûhu'l-Meanî, IV, 157).

*"...Çi koma mirovan di malek ji malên Xuda Teala de kom bibin, kitêba Xuda bixwînin û wê di navbera xwe de mûzakere bikin, sekînet [aramî] li ser wan peya dibe, rehm wan dinixumîne û melaîket hawîrdora wan digrin û Xuda Teala jî di nav yên li cem xwe de behsa wan dike."*[144]

Ebdûllah kurê 'Emr rîwayet dike, dibêje; wî got; ya pêğemberê Xuda! Ez di çi qeder zeman de Qur'anê xetim bikim? Wî got; **"di mehekê de."** Wî got; lê qeweta min ji vê zehftir e, bila ez çi bikim? Ebûmûsa wê peyvê dubare dike, wî ew her kêm kir heta got; **"wê di heft rojan de xetim bikim."** Wî got; lê qeweta min ji vê zehftir e, bila ez çi bikim? Wî jê re got; **"kî wê di zemanekî ji sê rojan kêmtir de xetim bikim, ew bi heqî wê fehm nake."**[145]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dibêje: *"Gellek fiqh-hilgir hene; lê ne fiqhzan in. Ewê ku îlmê wî feyde nediyê, cehaleta wî dê zirarê bidiyê. Qur'anê bixwîne heke ew mana te ji xirabîyan bike. Heke ew mana te ji xirabîyan neke, naxwe te ew nexwendiye!"*[146]

144 Muslim, Zikr, 38; Ebûdawud, Witr, 14/1455; Tirmizî, Qîraet, 10/2945.

145 Ebûdawud, Witr, 8/1390; Tirmizî, Qîraet, 11/2949; Darimî, Selat, 173.

146 Ehmed Bin Henbel, Zuhd, s. 401/1649.

## Tîlaweta Sehabîyên Kîram Ji bo Qur'ana Pîroz

Sehabîyên Kîram zehf tefekkur dikirin ji bo Qur'ana pîroz fehm bikin, ew kûr kûr li ser ayetan difikrîn û ew bi tefekkur û tedebbur dixwendin ji bo wê di heyata xwe de tetbîq bikin.

Ev gotina **Ûmer kurê Xettab** [Xuda jê razî be] ji bo vê ramanê çêtirîn mîsal û nimûne ye:*"Ûmer di diwazdeh salan de hînî Beqere bû, çi dema wî ew xetim kir, hêştirek xist qurban û ew serjêkir."*[147]

Ebdûllahê kurê Ûmer [Xuda ji wan razî be] jî sûretê Beqere hîn bûbû û heşt salan li ser ayetên wî xebat kiribû ji bo wan li ser jîyana xwe tetbîq bike.[148]

Lewra ew Qur'ana Pîroz; feraîzên wê, ehkamên wê û tiştên bi van re elaqedar hîn dibûn û wilo ew dixwendin. Wan kûr kûr ayetên pîroz bi tefekkur dixwendin û ew di jîyana xwe de tercume dikirin, di heyata xwe de pratîze dikirin.[149]

Zatek hatibû cem Zeyd kurê Sabit [Xuda jê razî be] jê pirs kiribû; tu di bara "xetimkirina Qur'ana Pîroz di hefteyekê de" çi difikrî? Wî jî jê re gotibû; "baş dibe" paşê wiha pêde çûbû:

---

147 Qurtûbî, 1, 40.
148 Mûwetta, Qur'an, 11.
149 Kettanî, Teratîb, II, 191.

"-Lêbelê bi min xweş e ku ez wê di pazdeh, yan jî bîst rojan de carekê xetim bikim. Heke tu pirs bikî; çima, di vê rewşê de ez baştir dikarim li ser Qur'anê bifikrim û maneya ayetên wê fehm bikim."[150]

**Ebdûllah kurê Mesûd** [Xuda jê razî be] wiha gotiye:

*"Kî, îlmê bixwaze bila maneyên Qur'anê tefekkur bike! Bila zehf hişê xwe bide ser tefsîr û qîraetê wê! Lewra îlmê pêşî û paşîyan di Qur'anê de mewcûd e."* [151]

Bedewîyekî ji devê mûbarekê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev ayetên ha: **"Kî, li dinyayê bi qasî giraniya zerreyekê qencîyê bike, ewê li axretê mûkafata wê bibîne. Kî, li dinyayê bi qasî giraniya zerreyekê neqencîyê jî bike, ewê li axretê cezayê wê jî bibîne."**[152] bihîstibûn û bi heyreteke mezin wiha pirs kiribû, gotibû:

"-Ey pêğemberê Xuda! Ma bi qasî giranîya zerrekekê jî?!"

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re gotibû:

"-Erê."

Ji nişka ve rewşa wî bedewîyî guherî û wî, wiha got:

"- Xwelî li min be ji ber kêmasîyê min!" Êdî ew nalîya. Wî gellek caran ev gotina xwe dubare kir û

150 Mûwetta, Qur'an, 4; Îbn-û Ebdûlbirr, Îstizkar, Beyrût 2000, II, 477.
151 Heysemî, VII, 165; Beyheqî, Şûeb, II, 331.
152 Zîlzal, 99/7-8.

rawestîya. Paşê wî ew ayetên ku bihîstibûn dubare xwendin û rabû ser xwe, ji dîwanê derket çû.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di piştî wî de got:

**"-Îman ket dilê vî bedewîyî."**[153]

## Tîlaweta Dostên Heq Teala Ji Bo Qur'ana Pîroz

**Fûdeyl kurê Iyaz** [quddîse sirrûhû] gotibû:

"-Qur'an hatiye xwarê ji bo emel pê were kirin. Lê mirovan xwendina wê tenê ji xwe re kiriye kar!" Jê re hate gotin;

"Emelkirina bi Qur'anê çawa dibe?" Wî ev bersiv da:

"-Emelkirina bi Qur'anê wiha çêdibe; mirov helalên wê helal û heramên wê jî ji xwe re heram qebûl bike û wan di jîyana xwe de tetbîq bike. Mirov fermanên wê ji xwe re ferman zanibe û xwe ji nehîyên [qedeğeyên] wê dûr bike û mirov li ser vegotin û îfadeyên wê yên heyret-engîz raweste [Xuda tesbîh bike, wan mijaran baş hûrbikole û kûr kûr tefekkur bike]."[154]

Heta di ayeteke tenê ya Qur'ana Pîroz de jî çendîn maneyên fereh hene. Çawa Îmam Şafîî [rehma Xuda lê be] gotiye:

153 Suyûtî, ed-Durrû'l-Mensûr, VIII, 595.
154 Xetîb el-Beğdadî, Îqtîzaû'l-Îlmî'l-Emele, rûp. 76.

"Heke însan sûretê el-Esr bi heqî tefekkur û tedebbur bikin, heta ev bi tenê jî têra wan dike."[155]

**Esme'î,** alimê mezinê îslamê bîranîneke xwe ya di bara tefekkurkirina li ser Qur'anê de wiha diguhêze û dibêje:

Bedewîyek hatibû cem xelîfe Hîşam kurê Ebdûlmelik. Hîşam jê re gotibû;

"-Ey Bedewî, şîretan li min bike!"

Wî bedewî berê tefekkura xelîfe da ser Qur'anê û jê re wiha şîret kir û got;

"-Wek şîretkar Qur'an bes e! Ez xwe bi Xuda bîserê zana ji Şeytanê qewitî diparêzim. Bi navê Xudayê sehkar û zana:

**"Hey wax li halê kêşanderên kêm û zêde dîbin be!; ewên ku dema ji xwe re, ji malê xelkê werdigrin, tam dipîvin; lêbelê dema ji malê xwe ji wan re jî dipîvin, yan jî dikişînn, kêm dikin! Ma ew yeqîn nakin ku ewê di piştî mirina xwe de careke din werin sağkirin û şandin; ji bo rojeke mezin!; roja ku mirov ji bo ferman û hukmê perwerdegarê aleman radibin."**[156]

Wî bedewîyî axaftina xwe wiha berdewam kir û got:

155 Îbn-û Kesîr, Tefsîr, "Sûretê el-Esr".
156 Mûteffîfîn, 83/1-6.

"-Mezinê min, ev cezayê wan kesan e ku di pîvan û kêşanê de kêm dikin! Vêca cezayê wan kesên ku bi neheqî temamî werdigrin jî tu tefekkur bike!"[157]

**Mûhemmed Xadimî,** alimê navdarê Osmanî jî wiha dibêje:

"Xwe girtina bi Qur'anê û tetbîqkirina wê di jîyana xwe de ji bo xilasbûna ji her tengasî, bela û mûsîbetan yekane rê ye. Li ser îbadet û taetan dewam bikin! Bi taybetî jî xwe baş bi tedebbur, tertîl û xwendina biedeba Qur'anê bigrin ku ev îbadetê ji hemû îbadetan bi fezîlettir in! Lewra xwendina Qur'anê ya wiha, her wekî axaftina bi Xuda re ye."[158]

## Nimûne û Mîsalên Tefekkurê Di Qur'ana Pîroz De Tefekkur kirina Di Îlmê Xuda Teala De

Di gellek ayetên Qur'ana Pîroz de behsa îlmê bênîhayetê cenabê Heq Teala dike û mirovan ji bo tefekkurê bang dikin.

Di ayeteke pîroz de wiha tê gotin:

**"Kilîlên nependîyê her li cem Ellah in, ji wî pê ve kes bi wan nizane û li bejî û deryayê çi hebin, ew**

157 Îbn-û Ebdûrrebih, Bedewî, Araplarin Ozdeyîşlerî ve Adetlerî, Îstanbul, 2004, rûp. 57.

158 Binêrin; Xadimî, Mecmûetû'r-Resaîl, rp. 112, 194, 200.

**bi gişan dizane. Çi peleke ku ji darê bikeve, ew her pê dizane û çi liba di tarîtiyên erdê de û çi tişta şil û çi ya ziwa her di kitêbeke diyar** [Lewhul-Mahfûzê] **de ne."**[159]

Her mûmîn, dema vê ayeta pîroz bixwîne, bila hinekê li serê raweste û bifikre: Ew qeder xezîneyên ğeybê hene ku hê nehatine vekirin, nehatine wicûdê û zanist û îlmê beşerî jî hê negihaye wan. Kilîlên van tevan bes li cem Xuda Teala ne. Ji Xuda Teala pê ve ti kes bi wan nizane. Ji bilî cenabê Heq Teala îlm û gumana ti kesî ji wan nîn e. Xuda Teala çawa hemû tiştên ğeybê dizane, eynî wisan ew hemû tiştên ku vêga hene, heta bi çiqil, teferrûat û her qism û beşên wan jî dizane. Çi pela ku ji darê bikeve, Xudayê me her pê dizane ka ew kengî ketiye, ew li kuderê ketiye û ew li hewayê jî çend caran wergerîyaye.

Cenabê Heq Teala bi her lip û daneyeke ku dikeve tarîtîyên erdê jî dizane ka ewê çi wextê şîn bibe û kî jî dê wê bixwe. Her tişta ku tê dîtin, ya ku nayê dîtin, her tişta ku tê tefekkur kirin û hest pê tê kirin, her tişta mezin û ya biçûk, her tişta ku bûye û ya ku hê nebûye, her tişta ku bi dizîkahî û ya bi eşkerehî, bi her ferehî û tenikîya wan ve ew di nav îlm û zanîna Xuda Tealane.[160]

159 Enam, 6/59.
160 Binêrin; Mûhemmed Hemdî Yazir, Heq Dînî, III, 1947; Ebû Hayyan, IV, 145-146, [En'am, 6/59].

Dema mirov ayeta pîroza ku li jorê bûrî dixwîne, xeyala însan çeng û baskên xwe ji bo ufûq û asoyên ku tên zanîn û yên ku nayên zanîn û alema ku tê dîtin û ya ku nayê dîtin jî vedike. Ew, di mechûlî û nedîyarîyên bejîyê û bêbinîtîyên derya û behrê de digere û radiweste. Ew di her goşe û qozîka kaînata bêser û bêbinî û ji tixûbên alema dîtber bi wêdetir de, gav bi gav zanîn û hunera Xuda Teala teqîb dike û dişopîne. Ew pelên bêjimarên ku ji hemû darên sererdê dikevin, temaşe û seyr dike. Xuda Teala, her pela ku li wir, li vir û li her cih û deverê ji daran dikevin, dibîne. Hîç lip û daneyeke ku di kûrahîyên sererdê de tê veşartin jî ji ber çavê Xuda Teala winda nabe. Her ter û hişka ku li kaînatê hedd û hesabê wan nîn e, her tişta ku hebe, ew bi mûcibê fermana Wî tevdigere û hereket dike.

Ev seyahet û gerheke wisan e ku mirov sergêj dike û eql û mejîyan jî di heyretê de ğerq dike. Ger û tûreke ku di dirêjahîya zemanî û ufûq û asoyên mekanî, kûrahîyên alema ku tê temaşekirin û ya ku nayê temaşekirin, ya malûm û ya mechûl, ya dîyar û ya nedîyar de tê kirin... Mesafeya vê ger û seyahetê zehf dirêj û meydana wê jî zehf fereh e. Xeyala însan nikare vê meydan û sahê tefekkur jî bike. Lêbelê ev tabloya mûkemmel, di ayeta pîroza ku li jorê bûrî de bi çend peyvan heta tu bibê bes, ew bi awayekî tîtîz, mûkemmel û berfereh xîjk kiriye.[161]

161 Seyyîd Qutub, Fî Zîlal, II, 1111-1113, En'am, 6/59.

Dema însan bi vî awayî li ser Qur'ana Pîroz û kaînatê tefekkur dike, heke çi qeder biçek û hindik be jî dîsa ew zanîn û şîyana cenabê Heq Teala îdrak dike. Ew mirovên ku ji tefekkurê dûr dimînin, ew ji raz û hikmetên îlahî dûr in û di nav heyateke nefsanî de tên kişandin û diçin.

**Sadî Şîrazî** wiha dibêje:

"Bi nêrîna xwedî eqlan, her peleke darên şîn ji bo merîfetûllah [naskirina Xuda] dîwanek e. Ji bo ğafilan jî hemû dar, ne pelek in."

Cenabê Heq Teala di ayeteke pîroza din de jî wiha dibêje:

"Hemd, ji bo Ellah e; ewê ku yên li erdê hene û yên li asîmanan jî hene hemû yên wî ne, li axretê jî hemd, her ji bo wî ye. Ew, xudan hikmet û haydar e. Ew, ya ku bikeve erdê, ya ku ji erdê derkeve, ya ku ji asîmanî dakeve, ya ku hilgere asîmanî jî dizane. Ew, dilovîn û gunehbexş e."[162]

Dema însan vê ayeta pîroz dixwîne, cism, hereket, şekl û maneyên bêjimar êrîş tînin ser zêhnê xeyalîyê wî. Ne mûmkin e ku mirov van tevan bixe xeyala xwe. Bûyerên ku vê ayetê ew destnîşan kirine, heta ne pêkan e ku mirov bikare qismek ji wan yên ku bes di an û demeke kurt de çêdibin û xilas dibin jî, tesbît bike û

162 Sebe' 34/1-2.

bijimêre. Heke temamê mirovan kom bibin û arîkarîya hev jî bikin ji bo vê bikin, ew emr û temenê xwe tevî ji bo vê weqf bikin, dîsa ew nikarin tesbît bikin ka çend tiştên ku di "anekê/kurtedemekê" de ji asîmanî hatine xwarê û çend tişt jî ji erdê hilgerîyane asîmanî!..

Gelo di vê anê de çi dikevin erdê? Gelo çend tixum û tov dikevin singa erdê? Gelo di bin axê de çend kurm, kêzik û xişxişok dihewin. Gelo çi qeder dilopên avê, molekulên ğazê û tîrêjên radyoaktîf dipalin nav vê axa bêser û binî? Erê, çendîn tişt dikevin nav axê! Temam jî di bin ferman û teqdîra cenabê Heq Teala de ne..

Di hemberî vê de jî gellek tişt ji axê dertên. Gellek gîya zîğ didin.

Di ayetên pîroz de wiha tê gotin:

**"Ma ew li erdê nanêrin ku me, ji her cotên rind çiqas giya di wê de hêşîn kirine?"**[163]

**"Bi rastî me, baran ji ewran li ser erdê pirr barand û rijand. Paşê me, erd bi cotkirin û giyaşînkirinê ji hev qelaştiye. Paşê me di erdê de lib; (genim, ce û birinc...) tirh û şînahî zeytûn û xurme dehlên têrdêlî û berhemdar hêşîn kirine. Me di erdê de fêkî û mêrg û ka hêşîn kirine. Da ku ji we û terş; (deveh, dewar û pez)ên we re bibin qût û çêrî."**[164]

163 Şûera, 26/7.
164 Ebese, 80/25-32.

**"Me, erd jî raxistiye, me têde çiyayên sabit durist kirine da ku neheje û me, li wê ji her çînîyên giyayê dîmen-sipehî, şîn kirine. Me ev tev kirine, da ku ji bo her bendeyê ku li Xuda vegere, bibin 'îbret, heq-dîtin û dibîranîn. Me, ji banî aveke bi xêr û bereket anîye xwarê û me pê baxçe û liba çandinîyê ya ku tê çinîn şîn kirine. Me, bi wê avbaranê darqesb û darxurmeyên dirêj ku xwedî çiqlên ser hev re ne, şîn kirine û deranîne. Da ku ji mirovan re bibin qût û rizq û me bi wê avê welatekî mirî û hişk sağ û şîn kiriye. Her wekî şînbûna van dar û fêkiyan e, derketina we ya ji goran û dîsa sağbûn jî."**[165]

Dîsa gellek kehnî ji nav axê vedirêjinû dertên. Çendîn volkan jî pizotan dipijiqînin. Çendîn ğaz dibin buxar. Çendîn kêzik ji hêlînên xwe yên bi dizî dertên sererdê.

Çi îbretengîz e ku dema berf dibare û her cihî dixe bin xwe, serê digre, candar û zindîyên bêhedd û hesab xwe dixin singa axê û heta dem û mideheke dirêj bi mûhafezekirina xaliqê aferîner di wir de sağ û salim dimînin. Xudayê me, her wekî ku ax ji bo wan kiriye pêçek. Ji ber vê ye ku dema berf dihele, em li meydanê şikêrên cesed û laşên wan candar û zindîyan nabînin. Ew hemû mexlûqat, dîsa derdikevin ser erdê û heyata xwe jî didin dewamkirin.

165 Qaf, 50/7-11.

Dîsa heke em bifikrin, ji erdê çendîn hêz û qewet, melaîket û ferîşte, rih û rewan, lavlav û dûa û deng û seda hildigerin asîmanî. Çendîn tiştên ku mirov dikare bibîne û çendîn tiştên ku mirov nikare wan bibîne jî.. Çendîn candar û bêcanên ku însan bes dikare hinekan ji wan bizane û ew ji gellekan ji wan jî bêxeber e..

Gelo ji asîmanî çi tên li erdê peya dibin? Ji alîyekî ve dilopên baranê, fişekên kevirasîmanî û tîrêjên şewatok û rohnîker… Li alîyê din jî tîr û xedengên **"qeza"**yê, **"qeder"**ên ku hatine dîyarkirin û rehmên îlahî... Qismek ji wan hemû mexlûqat û heyber bi ber wan dikevin; lêbelê qismek ji wan jî rehmên taybetî yên îlahî ne, ku bes ew hinek ji evdên Xuda dixin nav xwe û wan dinixumînin.

Ev hemû jî di nav an û kurtedemeke tenê de çêdibin û diqedin. Gelo îdraka însan dikare hemû tişt û bûyerên ku di aneke tenê de çêdibin fehm bike? Heke însan çendîn emr û temenan jî xerc bike, dîsa ew nikare van hadîse û bûyeran bijimêre. Hal-hal e îlmê bêtixûb ê Xuda Teala ku ji sînorên eql derbas dibe û ti astengan nas nake, dor li van hemû tişt û bûyeran girtiye û ew bi wan dizane, ew li kuderê çêbibin û bila çê bibin û ew kengê çêbûbin bila çêbûbin. **Naxwe divê em ti caran vê ji bîr nekin ku; hemû qelb bi nîyet, his û lêxistinên xwe ve di bin çavdêrîya Xuda Teala de ne.**[166]

166 Binêrin; Seyyîd Qutub, Fî Zîlal, V, 2891-2892, Seb'e, 2-3.

**Sûretê Waqîe**

Divê mirov li ser her sûret û her ayeta Qur'ana pîroz kûr kûr tefekkur bike. Lêbelê emê di vir de bes ji mijar û qabîla nimûne û mîsalê li ser hinek ayetên pîroz ên di sûretên Waqîe, Neml û Rûm de rawestin:

Xuda Teala bi vegotina dehşet û dijwarîyên qîyametê dest bi sûretê Waqîe dike. Ew dide zanîn ku di wê rojê de hinek mirov bilind dibin û hinek mirov jî nizm dibin. Ew eşkere dike ku piştî hesabê însan ji bo sê qisman tên cudakirin.

Paşê cenabê Heq Teala miqdarê bedewbûn û kerema bênezîr û bêhemta teswîr dike; ewa ku evdên nêzîkî Xuda û evdên salih digihin wan, ew evdên ku defterên emelên wan bi destê rastê wan ji wan re tên dayîn.

Ew li pey wê jî, wî ezabê dehşetdar û ğemnak ê ku ew bedbextên ku deftera emelên wan bi destê çepê wan ji wan re tê dayîn dê rast lê werin, teswîr dike. Ew evdên xwe bi van menzere û dîmenên ezabê yên ku mûyên însan ji wan gij dibin, ji gunehan şîyar dike û dide tirsandin.

Paşê cenabê Heq Teala evdên xwe vedixwîne tefekkurê û wan wiha şîyar û îqaz dike da ku ew nekevin vî ezabê ğemnak û tirsnak. Ew wiha ferman dike û dibêje:

**Aferandina Însanî**

**"Me hûn ji tineyî aferandine. Vêca çima hûn sağbûna piştî mirinê yeqîn û tesdîq nakin? De ka wê ava meniya ku hûn dirijînin malzarokan ji min re bibêjin, ma hûn ji wê meniyê însan diaferînin, yan jî em însan jê diaferînin?"**[167]

Çi mezin e huner û senetê îlahî! Ewa ku ev însan ji aveke weza yekî zerreyekî heta ku mirov bibêje nîn e, ewqas besît aferandiye û ew bi vê sîstema ku heta tu bibê bes bi awayekî hûr û kûr, ahengsaz û tevlîhev kar dike, mûzeyyen jî kiriye.

**Mirin û Vejîn** [ji nû ve sağbûn]

**"Me di navbera we de mirin parve kiriye û ji bo mirina her kesî dem danîye û em nîn in ku zora me were birin jî. Me di navbera we de mirin teqdîr kiriye, da ku bi vî awayî, em di piştî mirina we de yên wekî we bînin şûna we û em we di aferandineke din ku hûn pê nizanin de, di roja qiyametê de dîsa we sağ bikin."** [168]

Heqîqeta mirinê... Ti kes nikare ji ber mirinê bireve. Heke cenabê Heq Teala bixwaze, ew di cih de dişê înkarkeran ji navê bibe helakê û civateke baş bîne şûna wan.

167 Waqîe, 56/57-59.
168 Waqîe, 56/60-61.

**"Sûnd be ku hûn xulqandina xwe ya pêşîn dizanin. Çima hûn nafikirin û îbret jê nagirin ku ew Xudayê hûn ji tineyî xuliqandine, ewê di piştî mirina we de jî dîsa we sağ bike?!"**[169]

Ew Xudayê mezin ê ku aferandina pêşîn evqas mûkemmel pêkanîye, ew qadir e, dikare însan dubare dîsa biaferîne. Divê em li ser vê tefekkur bikin û em xwe ji bo "Beʿsû Beʿdel Mewt" yanî vejîna piştî mirinê amade û hazir bikin.

## Tuxm û Gîya

**"De ka hûn wî tovê ku direşînin, ji min re bibêjin, ma hûn wî derdixin û hêşîn dikin, yan jî em wî hêşîn dikin? Heke me bixwesta, me dê ew bikira qirş û qal û hûnê ji rewşa wî ya xirab poşman û ğemgîn bimana. We dê bigotaya: Bi rastî me ziyan kiriye. Na, em bêpar mane!"**[170]

Divê em bi heyran mayîn û bi îbret-girtin li zîraet, çandinî, dar û giyayên li hawîrdora xwe binêrin û em bi dehşet û ecêbmayîn li huner û senetê Xuda Teala yê xuliqandin û nîmetên wî seyr û temaşe bikin. Heke cenabê Heq Teala wan nede, hewl û tedbîrên însan dê pûç herin û dê tayek tenê jî gîya şîn nebe.

169 Waqîe, 56/62.
170 Waqîe, 56/63-67.

De ka em ji bo an û kurtedemeke tenê bifikrin ku va ye, hêşînahîyên hawîrdora me tev hişk bûne û bûne qirş û qal.. Hingê jîyana me dê çawa di cih de reş bibe!..

## Ava Şîrîn

Heq Teala wiha ferman dike û dibêje:

**“De ka hûn wê ava ku hûn vedixwin, ji min re bibêjin, ma we ew ji ewran aniye xwarê û barandiye, yan jî em wê ji wan tînin xwarê û dibarînin? Heke me bixwesta me dê ew şor bikiraya. Çima hûn spasiya nîmetên Xudayê xwe nakin?”**[171]

Ew ava şîrîna ku ji ewran tê xwarê, lutf û îkrameke mezina cenabê Heq Teala ye. Heke ew av bi awayekî tehl û neşîrîn bihataya xwarê ti kesî nedikarî ew şîrîn bikira. Yan jî heke hişke-salî bibe û baran nebare, kî dikare ewran pêkbîne û baranê ji wan bîne xwarê?!.

## Agir

Heq Teala wiha ferman dike û dibêje:

**“De ka wî agirê ku hûn pêdixin, ji min re bibêjin, ma we dara peyda kiriye, yan jî em wê peyda dikin? Me agir, ji bo sağbûna piştî mirinê kiriye îbretek û ji bo rêwiyên çolan jî kiriye feyde.”**[172]

171 Waqîe, 56/68-70.
172 Waqîe, 56/71-73.

Bi rastî divê mirov tefekkur bike; kî agir û darên pêketina wî aferandine ku bi rastî di heyatê de gellek feydên wî ji însanan re hene?

De li şîyan û qudreta Xuda Teala meyzînin, agir çawa ji dara şîn dertîne!.. De bila em heqîqet û mahîyeta êgir jî bifikrin... Ew çawa pêdikeve, ew çawa dişewite?!.

Rêwîyên çolê, di serma û tarîtîya şevê de xwe didin ber êgir. Agir, ji bo rêwîyan wasîte û navgîneke jêneger e ku ew pê xwe germ dikin, pêşîya xwe pê rohnî dikin û pê xwarina xwe dipêjin. Di eslê xwe de îhtiyaca hemû mirovan bi êgir heye. Naxwe Bê agir, jîyan pirr zor û zehmet e.

Naxwe agir, hem bûyereke îbretengîz e, hem jî ew her wekî av û hewayê îhtiyaceke zerûrî ye.

**Resûlûllah** [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha ferman dike, dibêje:

"Misliman di sê tiştan de; di av, gîya û agir de şirîk in."[173]

Li alîyê din, divê mirov li agirê dinyayê binêre û agirê cehennemê bîne bîra xwe... Çi tişteke îbretengîz e ku di bin me de tewqê maddeyên helandî û deryayeke dehşetdara êgir heye; di ser me de jî Tav, topeke tirsnaka agirê bipêt heye... Em jî di navbera van herdu agiran

173 Ebû Dawud, Buyûû, 60/3477.

de heyateke hînik û bi selametî dijîn. Em çi qeder ji bo Xudayê xwe yê ku ev şert û mercên heyatê ji me re bexş kirine, şukr bikin, dîsa hindik e, têra van nîmetan nake!..

Divê însan li hemberî van hemû nîmetan şukr ji Xuda re bike û zehf tesbîhê wî bike, wî ji kêmasîyan pak bidêre:

**"Navê Xudayê xwe yê mezin tesbîh bike û wî pak bidêre."**[174]

-Divê zimanê me; bi zikr, Qur'an û teblîxê meşxûl bibe, bi vî awayî Xudayê xwe tesbîh bike, pak bidêre,

-Divê dilê me; di nav kûrahîya hestan de şukrê wî bike û bi vî awayî tesbîhê wî bike, wî pak bidêre,

-Divê endam û azayên me; bi nimêjên nafîle, rojî û zêdekirina xizmetan şukrê wî bike, bi vî awayî li ser kirina tesbîhê wî dewam bike û wî pak bidêre.

## Stêr yan jî Wehî

Heq Teala dibêje: **"Na! Ez bi cihê çûna-ava û jêketina stêran sûnd dixwim, bi rastî heke hûn zanibin ev, sûndeke mezin e."**[175]

Mezinbûna îlahî ya bêsînor… Cenabê Heq Teala berê tefekkura me dide ser ebedîyetê...

174 Waqîe, 56/74.
175 Waqîe, 56/75-76.

Asîman, her wekî ku ew behreke bêdawî ye, okyanûseke bê serûbin e..

Di van ayetan de bal tê kişandin li ser wextê seherê û îbadet û teheccudên şevê, ew wextên ku piştî stêr winda û nedîtî dibin, ew destpê dike.

Dîsa di van ayetên pîroz de yek ji wan xusûsên ku sûnd bi wan hatiye xwarin jî helbet ew peyğam û wehî ye ku ji ronahîya çavên me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hatiye nazilkirin û hinartin. Ev, yan dibûn ayetek, yan dibûn çend ayet, yan jî dibûn sûretekî temam. Ji bo her peyğam û wehîyekê ji wan jî Necm: Stêr hatiye gotin.

### Qur'ana Pîroz

Heq Teala ferman dike, dibêje:

**"Bi rastî ev Qur'ana kerîm e. Ew di kitêba bi navê "Lewhulmehfûz"a ji guherandinê parastî de ye. Ji bilî yên xwe tam paqijkirî dest nadin wê."**[176]

Naxwe divê heta tu bibê bes; mirov rêz, hurmet û mezinkirinê ji Qur'ana pîroz re nîşan bide. Divê mirov bêdesmêj destnede berga [devgirteka] Mûshefê û qewlikê wê jî ewê ku Qur'ana pîroz diparêzin. Mirovê bêdesmêj nikare bi kenarê cilê xwe jî dest bide Qur'anê. Kirina bizav û hereketên ku vê mezinkirin

176 Waqîe, 56/77-79.

û rêz û hurmeta wê xirab dikin jî ğefleteke mezin e. Lewra Heq Teala ferman dike, dibêje:

**"Ew, ji aliyê perwerdegarê alemê ve hatiye şandin. Ma hûn, vê Qur'anê vedişêrin û biçûk dibînin? Ma hûn spasiya rizqê ku Xuda daye we bi derewandina Rezzaqê xwe, eda dikin?"**[177]

Yek ji mezintirîn nîmet û lutfa ku Heq Teala daye me jî ev e; em ji Qur'ana pîroz re kirine berpeyv û mûxateb. Şukra vê nîmetê jî ew e ku mirov wê rind îdrak bike û bi mûcibê wê bijî û wê di heyata xwe de tetbîq bike.

**Mirin**

Heq Teala dibêje:

**"Naxwe bila dema rûh dighîje qirikê, wê çaxê hûn jî lê dimeyzînin."**[178]

Dema ecelê însanekî nêzîk bibe û peyman û wadeya heq were, êdî însan neşê rûh li bedena wî vegerîne û mirov êdî hîç nikare tiştekî bike.

Ayet beşê mayî jî wiha temam dikin: **"Em ji we bêhtir nêzîkî wî ne, lêbelê hûn nabînin. Madem hûnê neyêne cizakirin, naxwe de wî rûhî li wî cesedî vegerînin; heke hûn di doza xwe de rastgo ne!"**[179]

177 Waqîe, 56/80-82.
178 Waqîe, 56/83-84.
179 Waqîe, 56/85-87.

Ha va ye, şîyan û qudreta Xuda Teala.. Ha va ye bêçaretî û neşîyana însan... Însan hemû bivên-nevên ewê her ji şîyan û teqdîra îlahî re stûxwehr bibin.. Ew mûtekebbirên zordar, ên ku di halê heyata xwe de bi rikdarî û enyat li ber fermana Xuda radibin jî ew di vê rewşê de dengê ti îtîrazê ji wan bilind nabe. Dema perdên bêjimar, ên ğefletê ji ser îdraka însan radibin, êdî ew di wê an û demê de bi her heqîqet û rastîya wê ve baş têdigihe ku li kaînatê hukmranîya rasteqîne ji bo Xuda tenê ye...

**Mirî di Yekî Ji Sê Halan de ye**

1] Yan ewê ji wan nêzîkê Heq Teala be ku ayeta pîroz di bara wan de wiha ferman dike û dibêje:

**"Herçî ewê ku mirî ye, heke ew ji nêzîkên Xuda be, ji bo wî aramî, rizqê pak û bihişta xwedî nîmet heye."**[180]

2] Yan ewê ji ehlê destê rastê be ku ayeta pîroz di bara wan de wiha ferman dike û dibêje:

**"Heke ew ji wan kesan be ku deftera emelên wan bi rexê wan yê rastê hatiye dayîn, ji wan re tê gotin: Ji te re ji hevalên te ehlê rastê, silav hene."**[181]

3] Yan ewê ji tekzîbkarên rêşaş, kafirên dînbetal û mislimanên gunehkar be ku ayeta pîroz di bara wan de me wiha agahdar dike û dibêje:

180 Waqîe, 56/88-89.
181 Waqîe, 56/90-91.

**“Lêbelê heke ew kesê mirî, ji derewandêrên ji rêderketî be, ha ji bo wî jî mêhvantiyeke ji ava keliyayî heye. Encama wî jî werkirina di cehennemê ye.”**[182]

## Xwe Avêtina Ber Penaha Cenabê Heq Teala

Heq Teala vî sûretê pîroz bi vê ayetê bi dawî dike û wiha ferman dike û dibêje: “**Bêguman ev mijarên ku di vî sûretî de hatin eşkerekirin, rastiyeke yeqînî û misoger e. Naxwe tu, navê Xudayê xwe yê mezin ji îddîayên mûşrikan pak bidêre.”**[183]

## Sûretê Neml

Heq Teala, xwediyê hikmet û zanîna bi her tiştan di vî sûretî de îzah dike ku wî ev Qur’ana pîroz şandiye xwarê. Ev sûret, ji me re ezemet û mezinbûna şîyan û qudreta Xuda Teala, bilindbûna qedr û şanê wî û mûcîzeyên ku Xuda Teala bi wan, nîmet û qencîyên xwe li pêğemberê xwe [dirûd û silavên Xuda lê bin] kirine, beyan dike û dide zanîn ku Heq Teala xwediyê wê balatî û bilindîya di ser sewîye û asta her tesewwir û xeyalê re ye. Her wiha dide zanîn ku şandina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo mirovan ji bo înkîşaf [pêşveçûn] û pêşketina mezinatîya qedr û qîmetê însanîyetê mizgîn û navgîn e.

182 Waqîe, 56/92-94.
183 Waqîe, 56/95-96.

Ji bo îzahkirina van kar û xusûsan sûretî behsa qisseyên pêğemberên Xuda Teala, Mûsa, Dawud, Suleyman, Salih û Lût [silavên Xuda li wan bin] dike.

Ev qisseyên tarîxî, delîl û belgenameyên neqlî û guhêzer in ku qudret û kemala cenabê Heq Teala nîşan didin. Çi dema mûşrikan îman bi van pêğemberan neanî, Heq Teala ev delîlên eqlî ji wan re anîn ku ew eşkeretir û gelempertir in.

Heq Teala wiha ferman dike û dibêje:

**"Yan jî, ewê ku erd û asîman aferandine û ji we re ji banî avbaranek aniye xwarê? Lewra me, bi wê avbaranê baxçeyên xweşik hêşîn kirine ku ji we re îmkan nebû hûn bikarin darên wan hêşîn bikin. Ma digel Ellah îlahekî din heye! Bi rastî ew milletekî wisane ku pûtan bi wî re yeksan digrin!"**[184]

Çi dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev ayeta pîroz xwend, di pey de wiha got:

*"Na, ji tiştên ku ew jê re dikin şirîk çêtir e, baqîtir e, hekîmtir e, kerîmtir [camêrtir] e, bilindtir û mezintir e."*[185]

Ayetên pîroz her bi berdewamî însan vedixwînin tefekkur kirina di wan mexlûqatan de ku ew ji bo şîyan û qudreta îlahî elamet û nîşan in.

Heq Teala wiha ferman dike û dibêje:

184 Neml, 27/60.
185 Beyheqî, Şûeb, II, 372.

"Qey ew pût çêtir in, yan jî, ew Xudayê ku erd kiriye şûnwar, di navbera erdê de çem herikandine, ji bo erdê çiyayên sabit xuliqandine û di navbera herdu deryayan de perdeyek vekişandiye? Ma digel Ellah îlahekî din heye? Bi rastî pirrên wan nizanin. Qey ew pût çêtir in, yan jî, ew Xudayê ku dema xwedî derd gazî wî bikin bersiva wan bide, tengiyê ji ser wan rake û we dike şûngirên hev li sererdê? Ma digel Ellah îlahekî din heye?! Çiqas fikirîna we hindik e! Qey ew pût çêtir in, yan jî ew Xudayê ku di navbera taristana bejî û behrê de rê nîşanî we dide û beriya rehma xwe bayê wek mizgînber dişîne? Ma digel Ellah îlahekî din heye?! Ellah ji wan tiştên ku bi wî re dikin hevpar pak û bilind e! Qey ew pût çêtir in, yan jî, ew Xudayê ku ji tineyî diaferîne, piştre we ji nû ve dîsa diaferîne û hem ji asîmên hem jî ji erdê rizqê we dide? Ma digel Ellah îlahekî din heye?! Bibêje: Heke bi rastî hûn rastgo ne, de ka delîla xwe bînin!"[186]

## Sûretê Rûm

Heq Teala careke din di vî sûretî de bende û evdên xwe gazî tefekkurê dike û wiha ferman dike, dibêje:

"Ma ew xwe bi xwe nafikirin ku Ellah, asîman û erd û yên ku di navbera wan de hene, bes bi heqî û ji bo demeke navlêkirî aferandine? Bi rastî pirr kes ji mirovan çavlêketina Xudayê xwe bawer nakin! Ma ew

186 Neml, 27/61-64.

li sererdê negeriyane ku binêrin ka encama ummetên beriya wan çawa bûye? Hal ev e ku ew bi xwe jî, ji alîyê hêzê ve ji wan xurttir bûn; erd cot kiribûn, wan ji van bêhtir erd avasaz kiribûn. Peyğamberên wan jî ji wan re gellek delîlên eşkere anîbûn. [Lê ji ber ku îman bi wan neanîn, encam û aqîbeta wan zehf kambax bû.] Ji xwe Ellah nîn e ku zulmê li wan bike lêbelê; wan bi xwe zulm li xwe dikir."[187]

Di piştî çend ayetan de Xuda Teala ji bo wehdanîyet û yekbûna xwe, şîyan û qudreta xwe û ezemet û mezinbûna xwe ya bêsînor delîl li pey delîlê eşkere dike û wiha dibêje:

"Xuda, yê sağ ji yê mirî derdixe û yê mirî ji yê sağ derdixe, ew, sererdê piştî mirina wê zindî dike. Her wiha hûn jî dê bêne deranîn. Ji nîşanên Xuda ye ku hûn ji axê aferandine, piştre hûn bûne mirov û belav dibin. Ji nîşanên Xuda ye ku ji we re ji we bi xwe hevser aferandine da ku hûn çavnasî hev bibin û di navbera we de hezkirin û merhemet peyda kiriye. Bi rastî di vê de ji bo milletekî ku bifikirin îbret hene. Ji nîşanên Xuda ye, aferandina wî ya erd û asîmanan, cuda cudabûna zimanên we û rengên we. Bêguman di vê de ji bo zanayan ders û îbret hene. Ji nîşanên Xuda ye, xewa we ya bi şevê û gera we ya li ciwanmêriya Ellah ya bi rojê. Bi rastî di vê de ji bo milletekî ku bibihîzin, îbret hene. Dîsa ji nîşanên Xuda ye ku birûskê bi tirs û hêvî

187 Rûm, 30/8-9.

nîşanî we dide. Ji banî avê dadixe û bi wê piştî mirina erdê wê bi hêşînkirinê sağ dike. Bi rastî di vê de ji bo milletekî ku têbighin îbret hene. Ji nîşanên Xuda ye ku erd û asîman bi fermana wî li ser pêyan e. Piştre dema gaziyekê ji erdê li we bike, di cih de hûnê ji erdê bêneder. Yên ku li erd û asîmanan hene, tev yên Xuda ne. Tev ji wî re stûxwar bûne.”[188]

## Ewên ku Ayetên Xuda Teala Nafikrin

Dema cenabê Heq Teala wesfê evdên xwe yên xas dide, wiha dibêje:

**“Ew in, yên ku dema ayetên Xudayê wan di bîra wan bêne-anîn, li biwara wan bi kerrîtî û korîtî tevnegerin.”**[189]

Herçî mûmîn in, dema Qur’an ji wan re tê xwendin, yan bi ayetên pîroz nesîhet û şîret li wan werin kirin, ew bala xwe didin ser wan, ji dil û can li wan guhdarî dikin, li ser wan tedebbur û tefekkur dikin û îtaeta fermanên wan jî dikin.

Heq Teala di ayeteke pîroza din de jî wiha ferman dike, dibêje:

**“Bawermend bes ew in; yên ku dema behsa Ellah tê kirin dilên wan dilerîze û dema ayetên wî ji**

188 Rûm, 30/19-26.
189 Furqan, 25/73.

**wan re tên xwendin îmana wan pê zêde dibe û xwe her dispêrin Xudayê xwe."**[190]

Berevajîyê vê, ew kesên ku nesîb û qismetê xwe ji feyz û rûhanîyeta Qur'ana pîroz negirtibin, di îşaret, remz û sirrên wê negihabin, li ser raz û sirrên wê ne waqif bin û ferman û nesîhetên wê negirtibin, di xusraneke mezin de ne.

Cenabê Heq Teala ferman dike û wiha dibêje:

**"Ezê kesên ku li erdê bi neheqîyê xwe li mezinatiyê datînin ji ayetên xwe vegerînim. Heke ew hemû ayetan bibînin jî dîsa dê îmanê bi wan neyênin. Heke ew rêya hîdayetê bibînin jî wê ji xwe re bi rêyîtî nagirin. Heke ew rêya şaşîyê bibînin, wê ji xwe re bi rêyîtî digrin. Lewra wan ayetên me derewandine û ew jê bêagah bûn."**[191]

Ew kesên mutekebbir, yên ku hest bi hebûna xwe dikin û xwe ji mirovên din çêtir û mezintir dibînin, maneya ayetên pîroz nahizirin û îbret û ders ji wan nagirin. Lewra cenabê Heq Teala ew derfet û îmkan ji bo qelb û dilên zaliman nedaye ku ew pê bikarin hikmetên Qur'anê fehm bikin û li ser tecellîyatên mezinbûna wî jî mûttelî û waqif bibin. Wî ew ji vê îkrama mezina îlahî mehrûm û bêpar kirine. Lewra ew Qur'ana Pîroza ku xezîna sirr û hikmetên îlahî ye,

190 Enfal, 8/2.
191 'Eraf, 7/146.

ne mûnasib e ku ew di avzêmên qeswet û hişkdilên wiha de bibe. Lêbelê ew bes di qelbê evdên wî yên teqwadar de nifûz dike û ji wan re dibe nûr û pêşîya wan rohnî dike.

Herçî halê ğemnak ê ğafilên ku ji teqwayê bêpar in, ji ber vê ye ku Qur'ana pîroz bi heqî tefekkur nekirine û di encamê de bi hişkbûna nefsanîyeta xwe mûbtela û dûçar bûne. Heke wan bi însaf li ser Qur'ana pîroz tefekkur bikira û ew bibûna peyrewê wê, hingê ewê li hemberî telîmatên îlahî abûs, rûtirş, sergêj û şaşo maşo nemana. Berevajîyê vê, wan dê heqî qebûl bikira, ewê bibûna xwediyê exlaqê xweş û wan dê para xwe ji sirr û hikmetên îlahî wergirta. Di encamê de wan dê rêya aramî û seadeta ebedî ji xwe re vekirana.

Heta bi vir, ji van tiştên ku hatin îfadekirin tê fehmkirin ku ji bo mûmînekî dûrbûna ji tefekkurê û zîyankirina sermayê emr û temen hewante nabe mewzûbehs [mijara axaftinê]. Lewra Heq Teala wî mirovê ku qedr û qîmetê emr û temen nizane û wî ne di cihê wî de winda dike, wiha ferman dike û dibêje:

**"Ez, bi demê sûnd dixwim; cinsê însan di xusran û ziyanê de ye! Lêbelê ewên ku îmanê tînin, emelê salih dikin, wesîyeta heqiyê li hev dikin û wesîyeta sebrê li hev bikin, cuda ne!"**[192]

192 'Esr, 102/1-3.

Ji ber vê sedemê divê nêrîna mûmînê teqwadar îbret û sikûta [huşbûna] wî jî tefekkur be. Nexasim divê ew li ser ayetên Qur'ana Pîroz kûr kûr heqîqetên îlahî tefekkur bike û hewl bide ji bo bigihîje merîfetûllahê [naskirina Xuda]. Dîsa divê mûmîn Qur'ana pîroz wek mektûb û nameyeke ku ji cenabê Heq Teala ji evdên wî re hatî şandin wergire û bi eşq û heyecana îmanê xwe bi Qur'ana ku jêder û serkehnîya aramî û seadeta ebedî ye, bigre û wê bernede.

### Bûna Daîmî di Halê Mûraqebê de

**Mûraqebe;** bi meneyên her wekî "kontrolkirina alema derûnî, çavdêrî-kirin û komkirina bal û dêhnê xwe li ser deq û nuqtekekê" tê. Ew di Tesewwufê de jî wiha hatiye pênase û terîfkirin; "parastina dil e, ji her tiştên ku zirarê didinê, di ferqê de bûna ku «Xuda her dem min dibîne, nêrîna wî li ser qelbê min e» yan jî "çavlirêbûna feyzê" ye. Yanî mûraqebe, ew e ku însan berê xwe bide ser alema derûnîya xwe û her tim halê xwe mûhasebe û tefekkur bike. Bi vî awayî, mirov halekî rûhanî yê wisan qezenc bike ku ew her an û wextê bi dilekî şîyar xwe bavêje ber penaha Rebbê xwe.

### Kurttirîn Rêya Ku Mirov Digihîne Heq Teala

Alema dil jî, her wekî alemên zahirî ji bo tefekkurê rast û qadeke bêserî û bêbinî ye. Ev qisseya

**Hz. Mewlana** ehemmîyet û giringîya tefekkurê li ser mûraqebê yanî li ser alema derûnî çi sipehî îfade dike:

*"Rojekê, sofîyek çûbû nav bexçekekî bi çîçek û gul ji bo şad bibe û xwe di tefekkurê de noq bike. Ew li hemberî rewşa renge-renga çîçekên bexçeyî mest dibe. Ew çavê xwe miç dike û xwe di mûraqebe û tefekkurê de noq dike. Li wir kesekî ğafil hebû, wî zen kir ku sofî raketî ye. Ew ji vî halê wî heyirî ma û hest bi tengbûnê kir, ji lewma ji wî sofî re wiha got:*

*«-Çima tu radizî? Çavê xwe veke û li weşîyên tirî, li çîçekên belbûyî û li çîmenên şînbûyî seyr û temaşe bike! Li eserên rehma Xuda binêre!»*

Sofî jî wiha bersiva wî da:

*«-Hey Gidî Ğafilo!! Vê baş zanibe ku mezintirîn esera rehma îlahî dil e. Ji bilî dil her tiştên din her wekî siha vê esera mezin in. Di navbera daran de rûbarek diherike û diçe. Tu di ava zelal û berraqa wî de eksa [siha] darên li ser herdu terefên wî temaşe bike û bibîne... Ewên ku di nav avê de eks dikin û tên dîtin, bağ û bexçekekî xeyalî ye. Bağ û bexçê eslî, di dil de ne. Lewra dil nezergeha [nêrîngeha] îlahî ye. Herçî eksa zerîf û letîfa wan e, ew di alema dinyayê de dibin ku ew jî ji av û herîyê çêdibin. Heke ewên di vê alemê de, ne eksa wê keyfxweşîya selwî ya di alema dil de bûna, cenabê Heq ji vê alema xeyalî re nedigot; "**pertalê xwe xapandinê"** lewra Heq Teala di sûretê Alî Îmran ayeta 185'an de wiha ferman dike, dibêje:*

**«... Jiyana vê dinyayê jî bes pertalê xapandinê ye.»**

*Ewên ku ğafil in û ewên ku vê dinyayê cennet zen dikin dibêjin; "cennet ev e!" Her ew xwe bi dîmena vî rûbarî dixapînin. Ewên ku ji bağ û bexçên eslî yanî ji ewlîyaûllah dûr dimînin, ew meyla xwe didin wê xeyalê û xwe dixapînin. Rojekê, ev xewa ğefletê her dê bi dawî bibe. Çav dê werin vekirin û heqîqet her dê were dîtin. Lê ma di nefesa dawîn de dê çi feyda vê menzere û dîmenê çêbibe? Xwezîya me bi wî kesî be ku berî mirina xwe, mirin nas kiribe û rûh û rewanê wî jî bêhn ji heqîqeta vî bağî wergirtibe."*

**Mûraqebe;** rêyeke mûhîm e ji bo gihiştina Xuda û bidestxistina îlm, îrfan, sirr û hikmetê. Heta mûraqebe, di tesewwufê de ji rêyên pêşketina manewî ya bi qîmettirîn û bi feyztirîn tê jimartin.

Mûmînê ku bixwaze mûraqebe bike, divê ew pêşî qelbê xwe ji vê re hazir bike, divê wekî ku ew di nimêjê de be rûne û serê xwe bi ser kabên xwe de berjêr bike. Di vê rewş û wezîyetê de divê ew temamê dêhn û bala xwe bide ser heqîyê, bide Rebbê xwe. Divê ew di nav vî haletê rûhî de û bi vê îtîqad û bawerîyê tefekkur bike; *"Xuda her dem min dibîne, ew her wext û anê bi min re ye, ew ji min re ji min nêzîktir e.."* Di encama vê de ew nûra îlahî ya ku dorê li her tiştê digre, her dê bi ber dilê wî ve jî bikişe û bikeve qelbê wî jî.

**Hezretê Mûhemmed Xadimî** dibêje; "mirov dikare mûraqebê bi rêya rabitê jî bike. Di encama vê de jî dê hinek hikmetên îlahî tecellî bibin."[193]

**Mûraqebe,** di nêrîna ehlê îşqê de kurttirîn rê ye ku mirov nêzîkî Xuda Teala dike. Lewra bi qelbê xwe berê xwe dana Xuda, ji berê xwe dana wî bi endam û azayên din bi tesîrtir û mûhîmtir e. Çimkî her kes, her demê bi hêsanî dikare bi qelbê xwe berê xwe bide Rebbê xwe. Hal-hal e ku di halên yextiyarî û nexweşîyê de emel kirina bi endam û azayan zor û zehmet dibe.

**Ehlê Hikmetê** gotine;

*"Nefeseke tenê bûna bi mûraqebeya cenabê Heq Teala û bi hazirbûna dil ji bûna xwediyê milkê Silêman bilindtir û çêtir e."*

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] mezinbûna mûkafat û sewaba mûraqebê ji me re daye zanîn û gotiye:

*"Heft kes hene Xuda sihê li wan dike di wê roja ku ji siha wî pê ve ti siheke din nîn e: Îmamê adil e. Ew ciwan e ku di îbadetê Rebbê xwe de rabûbe, mezin bûbe. Ew zilam e ku dilê wî bi mizgeftan ve girêdayî be. Ew herdu kesên ku ji bo Xuda ji hev hez kiribin; ji bo wî hatibin cem hev û ji bo wî ji hev cuda jî bûbin. Ew zilam*

193 Xadimî, Rîsale Fî Usûlit-Terîqe, vr. 139.

*e ku jineke xwedî meqam û cemal wî karî jê bixwaze, ew jî jê re bibêje; ez ji Xuda ditirsim. Ew zilam e ku sedeqe bide, ewqas bi dizîkahî bide heta çepê wî nizanibe ka rastê wî çi înfaq kiriye. Ew zilam e ku bi tenha zikrê Xuda bike û hêstir ji çavên wî bibarin.*"[194]

## Cureyên Mûraqebê

**Mûraqebe;** ew e ku mirovê wê hesta îhsanê bijî, ewa ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji me dabû nasîn, dema Cebraîl [silavên Xuda lê bin] jê pirs kiribû; îhsan çi ye? Wî jê re gotibû: *"Ew e ku tu îbadet ji Xuda re bikî her wekî ku tu wî dibînî, heke tu wî nabînî jî ji xwe ew te dibîne.*"[195]

Ji bo mirov di Îslam û Îmanê de bigihîje kemalê; divê mirov bigihîje para bilind û noqa îhsanê. Ji bo mirov karibe di nav halê îhsanê de bijî, divê mirov daîm di ferqa vê de be ku cenabê Heq Teala her tim mirov dibîne, naxwe divê mirov tim xwe mûraqebe bike, yanî mirov xwe ji hêla manewî ve kontrol bike, bi vî awayî divê mirov xwe bi rêkûpêk bike.

Ji bilî vê jî, divê ev heqîqet di dilên me de wergere îdrakeke daîmî ku Xuda ji me re ji me nêzîktir e.

Dema ev hest û şiûr bikevin dil, hingê naxwe evd

194 Binêrin; Buxarî, Ezan, 36; Muslim, Zekat, 91.
195 Muslim, Îman, 1, 5; Buxarî, Îman, 37.

ji îmanê gihaye îhsanê. Êdî ewê hemû emelên salih bi dilekî tije feyz û rûhanîyet îfa û eda bike û ewê di zewq û temijîna menewî ya di tefekkur-kirina li ser Qur'an, kaînat û însanî de ğerq bibe.

**Ehlê Tesewwufê,** ji bo karibin bi tefekkurê temamê Qur'ana Pîroz bixwînin, pêşî li ser tefekkur-kirina hinek ayetan hîn dikin. Ji ber vê ew pêşî wan ayetan dibijêrin; ewên ku zehftir tesîrê li dinyaya dilê însan dikin û hest û hezkirina "bi Xuda re bûn"ê xurt dikin. Di Neqşîbendîtîyê de ji bo kûr kûr noqbûna li ser tefekkur-kirina van ayetan **"Mûraqebe"** tê gotin. Çar qûnağên cureyên mûraqebeyan hene:

### 1. Mûraqebeya Ehedîyyet

Di vê mûraqebê de mirov "sûretê Îxlas"ê tefekkur dike. Mirov ehedîyyeta Xuda, yê ku hemû sifetên kemalê jê re hene û ew ji hemû sifetên nuqsanîyan pak û mûnezzeh e, tefekkur dike û hizr dike ku ji vê mertebê feyz bi letîfeya qelb ve dikişe.

Maneya ayetên ku mûraqebeya wan tê kirin tê tesewwurkirin hem jî bêyî ku mirov berê xwe bide teşbîh û pê sipartina cîhetan. Mirov bes difikre ku ev sifet ji Xuda re hene. Dema ev tesewwir lawaz û qels dibe, ayeta pîroz dubare tê xwendin û careke din mirov di tefekkurê de noq dibe. Mirov çi qeder li ser vê dewam bike, hesta îhsana mûmînî ewqas zêde dibe û

destpê dike nesîb û para xwe ji merîfetûllah [naskirina Xuda] werdigre.

Di sûretê Îxlas de bi awayekî taybetî vê heqîqetê tîne bîra me: Ellah Teala yek û tek e, hemta û nezîrê wî nîn in. Tenêbûn xasê Wî ye.

Li vê dinyayê tecellîyeke zatê cenabê Heq Teala nîn e. Wî sifetê **"mûxalefetûl hewadîs"** heye; ew naşibihe mexlûqên ku piştre hatine aferandin. Li kaînatê çi hebe ku em karibin bikrin zatê cenabê Heq Teala ji bûna tiştekî wek wî bilind e. Rebbê me mûteal e, yanî ew ji naskirina me zehf bilindtir e, ew di mûkemmellîyeteke wisan de ku îdraka însan tênagihe. Ji ber ku şibh û ziddê wî nîn in, ne mûmkin û pêkan e ku mirov zatê wî îdrak bike.

Cenabê Heq **"Semed"** e. Îhtiyaca wî bi tiştekî nîn e; lê îhtiyaca her tişt û her kesî bi wî heye. Li kaînatê hemû hêz û qewet xasê cenabê Heq Teala ne. Divê mirov qudret û ezemeta Xuda Teala tefekkur bike, nekarîna xwe fehm bike û bi hemû hebûna xwe ve jê re desteber û teslîm bibe. Divê mirov xwe ji enanîyet û ezperestîya xwe xwerû bike, di ecz, nekarîn û bêçaretîya xwe bigihe û her daîm bibêje; "eman ya Rebbî!" û hewl bide ji bo bibe tecellîgeha sifetên cemalê yê Heq Teala.

Ehedîyyet, yanî tekîtî; dabeşbûn, ji hev cudabûna li ser hijmar û perçeyan û şirîkatîyê qebûl nake. Ji ber vê Rebbê me, ti weled û zaro newelidandine, ti dê-bavan jî ew newelidandine û tiştek jê

re hevta nebûye. Yanî cenabê Heq Teala wekî ku krîstîyan îddîa dikin bi ti awayan ne "bav, dê û kur" e. Lewra eqîda tewhîdê şirîkatiyê tehemmul nake. Çimkî ewê ku biwelidîne, perçe dibe, ewê ku perçe jî bibe, fena û tine dibe. Ew tiştê ku wî welidandî jî di encamê de eynî wekî wî lê tê. Naxwe welidandin bi xwe, xasê wan fanîyan e ku baqî namînin û ew ji bo dewamkirina neslê îhtiyacek e. Îhtiyaceke wiha jî di bara Xuda Teala de, ewê ku di zatê xwe de her kemal civandiye û ew Ehed, Semed û Wacîbûl Wucûd e, dibe kêmasî û nuqsanî. Hal-hal e, ew jî ji her nuqsanî û kêmasîyan pak û mûnezzeh e.

**Welhasil;** ew qelbê ku merkez û navenda tefekkur û texessusê ye, divê ew nexşên qudreta îlahî û tecellîyatên ezemeta wî kûr hest pê bike û ew tim û daîm di halê hemd kirinê de bibe.

## 2. Mûraqebeya Me'îyyetê

Di vê qûnağê de divê mirov maneya vê ayeta pîroz: **"Hûn li kuderê dibin bibin, her ew, [Xuda] bi we re ye."**[196] kûr kûr tefekkur bike. Hingê ewê têbigihe ku divê evd bi Xuda re bibe. Ev keyfîyet [çawanî] jî di qelb de dibe hest û şiûr.

Însan, bi ti awayan li derveyî îlm û hukmranîya cenabê Heq Teala namîne. Çi ew di bin erdê de be, çi ew

196 Hedîd, 57/4.

di kûrahîya asîmanî de be, naxwe ew li kuderê dibe bila bibe ne pêkan e, ew li derveyî îlm û zanîna Xuda Teala bimîne. Lêxistina qelban, nefes standin û dayîn, dîtin, bihîstin û xebitîna bi rêkûpêk a endam û azayên din îsbat dikin ku cenabê Heq Teala her dem bi evdê xwe re ye. Çawa ku dema ecelê wan tê, Xuda Teala van derfet û îmkanan ji wan distîne, hingê ew jî wefat dikin.

Cenabê Heq Teala wiha ferman dike û dibêje:

**"Ma tu nabînî ku Xuda, çi li erdê hebin û çi li asîmanan hebin, her pê dizane? Çi pistepista ku di nava sêyan de çêbibe, Xuda her çarê wan e.. Heke pênc kes bikin pistepist Xuda her şeşê wan e.. Çi ew ji van hijmaran kêmtir bin û çi ew ji van zehftir bin, ew li kuderê dibin bila bibin, Xuda her bi wan re ye. Piştre ewê roja qiyametê, karê ku kiribûn ji wan re vebêje. Lewra Xuda, bi her tiştê zana ye."**[197]

Nêzîktirîn dostê însan cenabê Heq Teala ye. Ew, çi bi zanîna xwe, çi bi şîyan û qudreta xwe, çi bi zatê xwe çi jî bi melaîket û ferîşteyên xwe di însan teserrufatîyê dike û ew di her xusûsê de ji hemû nêzîkên însan jî ji însan re nêzîktir e. Nêzîkên însan bes rewş û halên wî yên zahirî dizanin.. Çawa ew nikarin di her xusûsê de feyde bidin wî, eynî wisan ew nikarin tengasîyan jî ji ser wî rakin. Lêbelê Xuda Teala her hal û rewşa wî dizane û çi bixwaze, wê dike jî. Nexasim di wexta

197 Mûcadele, 58/7.

mirinê de... Ha ew çax, ti kes bi qasî cenabê Heq Teala ji însan re ne nêzîk e. Ayeta pîroz wiha ferman dike, dibêje:

**"Naxwe bila dema rûh dighîje qirikê, wê çaxê hûn jî lê dimeyzînin, em ji we bêhtir nêzîkî wî ne, lêbelê hûn nabînin."**[198]

Cenabê Heq Teala wan evdên xwe yên ku ji bîr dikin her dem Xudayê wan bi wan re ye û ewên ku ne xwediyê vê hest û şiûrê ne, wiha îqaz dike û dibêje:

**"Ew ji mirovan vedişêrin û ji Ellah venaşêrin. Hal ev e ku ew, digel wan e, dema ew, bi şevê plana gotina ku li xweşiya Xuda naçe, datînin. Ellah ji ya ku ew dikin re dorpêçîner e."**[199]

Ew evdê ku fehm bike Xuda Teala her dem bi wî re û ew çi bike jî ew her wî dibîne, hingê ewê xwe ji sûc û gunehan dûr bike û her tim li bizav û hereketên xwe jî miqate be.

### 3. Mûraqebeya Eqrebîyyetê

Di vê qûnağê de ev ayeta pîroz: **"Sûnd be ku me, însan aferandiye, em wasewasên ku nefsa wî jê re çêdike jî, dizanin û em ji şahreha wî jî nêzîktirî wî ne."**[200] tê tefekkur kirin. Cenabê Heq Teala ji me

---

198 Waqîe, 56/83-85.
199 Nîsa, 4/108.
200 Qaf, 50/16.

bêhtir nêzîkî me ye. Ew fikr û ramanên me, nîyet û mebestên me û hest û hissîyatên me dizane.

Xuda Teala bi tenê raman û biryarên ku bi dizîkahî tên qelbê însan dizane. Ewên ku heta melaîketên ji bo nivîsandin û qeydkirina kirin û gotinên mirovan wezîfedar in jî pê nizanin. Lewra çawa wî her tişt aferandine, her ew e, yê ku ew fikr û raman jî aferandine.[201]

Ma ewê ku diaferîne, nizane wî çi aferandine?

Însanekî ku bi awayekî layiq vê heqîqetê tefekkur bike, ne mûmkin e, ew nelerize û hesabê ji xwe nepirse! Heke însan karibe bi awayekî tam maneya vê ayetê tenê jî di zêhn û dilê xwe de zindî bike, êdî ewê newêribe xebereke ku cenabê Heq Teala pê razî nabe, bibêje û heta ewê newêribe fikreke ne meqbûl di dilê xwe de jî derbas bike. Ev ayeta pîroz tenê kafî ye ji bo însan her dem li ser teqwayê bijî û her dem bi

201 Cenabê Heq Teala dema xêr û şerr tê meydanê ew jî bi sifetê xwe yê "xaliq-aferîner" tecellî dibe. Yanî dema evd bixwaze kirineke xirab bike, Xudayê me, heke bixwaze sifetê xwe yê xaliq û aferîner tecellî dike, wê arzû û tiştî jê re dixuliqîne û ji bo bicih-hatina wê jî destûrê dide wî. Heke ew bixwaze rehmê li wî bike, ji bo bicih-hatina wê firsend û keysê nade. Ev rewş û hal, ji bo fiêl û kirina xêrê jî derbasdar e. Yanî dema evd bixwaze fiêl û kirineke xêrê bike, Xudayê me heke bixwaze sifetê xwe yê xaliq û aferîner tecellî dike û ji bo bicih-hatina wê xêrê lutf û qencîya xwe li wî dike. Heke ew bixwaze jî ji bo bicih-hatina wê xêrê firsend û keysê nade. Di vê rewşê de ew evd, ji bo nîyeta xwe ya xêrxwazîyê jî dîsa heman ecr û sewabê qezenc dike. Yanî cenabê Heq Teala hem xaliq û aferînerê xêrê ye, hem jî ew xaliq û aferînerê şerrê ye jî. Lêbelê ew bi kirina xêrê razî ye; lakin riza wî bi kirina şerrê nîn e.

endîşeya ku hesab dê ji min bê pirsîn, ew şîyar be û li xwe miqate be.

Heq Teala di sûretê Enfal de dide zanîn ku ew dikeve navbera însan û dilê wî. **"Gelî yên ku îman anîne! Bersiva Ellah û peyğamberê wî bidin, dema ew, ji bo ya ku we zinde dike, li we gazî bikin û bizanin ku Ellah dikeve navbera mirovî û dilê wî. Bi rastî hûnê li ber wî bêne komkirin."**[202] Heke ew bixwaze berê arzû û fikrên wî diguherîne. Cenabê Heq Teala ji bo însan, ji dilê wî bêhtir nêzîkî wî ye û ew ji dilê wî re jî ji wî nêzîktirî wî ye, ew li ser dilê wî hukmdar e. Şîyan û qudreta wî ewqas derbasdar e ku ew bes nakeve navbera kesî û dîgeran; lê ew dikeve navbera mirov û dilê wî bi xwe jî. Ew di demekê de însan ji emelên di dilê wî de mehrûm û bêpar dike. Ew dikare ezm û îradeya wî xirab bike û berê wî bi alîyê berovajî ve wergerîne. Ew dikare qenaetên wan û zewqên wan biguherîne. Ji ber vê yekê, dema Ellah Teala perdê bi ser însan û dilê wî de bike û wî ji bo mirinê gazî bike, evd nikare bersiva gazîya wî nede û derfet û îmkana wî nîn e ku li hemberî fermana wî jî rabe. Ji ber vê, însan nizane ka dê di piştî nefesekê de çi were serê wî.[203]

**Ebû Mûsa el-Eşerî** [Xuda jê razî be] wiha vedibêje:

202 Binêrin; Enfal, 8/24.
203 Binêrin; Elmalı M. Hemdî, IV, 2386-2387, Enfal, 8/24.

"Em di rêwîtîyekê de bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re bûn. Dema em hildigerîyan ser giran, me bi dengê bilind **"Ellahû Ekber! Laîlaheillellah"** digot û tekbîr û tehlîl digotin. Ji lewma pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji me re got:

"-Gelî mislimanan! Zorê li xwe nekin. Lewra hûn gazî yekî kerr û yekî nehazir nakin. Ew her dem bi we re ye. Ew nêzîk e."[204]

Her wekî ku ji vê ayeta pîroz û hedîsên şerîf yên wekî wan tê fehmkirin, cenabê Heq Teala ji evdê xwe nêzîk e, ew dixwaze evdê wî jî ji wî nêzîk bibe. Ji lewma Heq Teala ji evdê xwe re gotiye: **"Biçe sicûdê û nêzîk bibe!"**[205]

Ew şexsê ku mûraqebeya Eqrebîyyetê îdrak dike. Yanî ewê ku dizane Xuda Teala heta wan fikr û hestên ku dikevin dilê wî jî dizane, ew çawa xwe ji karên xirab dûr dike eynî wisan xwe ji fikr û hestên xirab jî dûr dike. Ew her hewl dide ji bo nîyeta xwe li ser durustî û îstîqametê bigre.

Di encama van tefekkuran de di însan de li hemberî cenabê Heq Teala unsîyet, hogirî, demsazî û mûhebbeteke kûr tê meydanê.

---

204 Buxarî, Cîhad, 131; Muslim, Zkr, 44.
205 'Eleq, 96/19.

### 4. Mûraqebeya Mehebbetê

Di vê mûraqebê de ayeta pîroza: **"Ew ji wan hez dike, ew jî ji wî hez dikin."**[206] tê tefekkur kirin. Di encama vê tefekkurê de di dilê însan de mehebbet û hezkirina ji Xuda Teala zêde dibe. Êdî evd, ji ber hezkirina ji cenabê Heq Teala bi nêrîna mehebbet û hezkirinê li hemû mexlûqatên wî dinêre. Ew li kitika li ber derî, li se û li çiqilekî dara şîna li nav bexçe jî bi mûhebbet û hezkirin dimeyzîne. Dema ew çîçekeke belbûyî dibîne, dibêje; "eman ya Rebbî, tu çi xweş lutf dikî! Te ev çîçek jî îkram kiriye." Ew tim di halê hemd û şukrê de dibe. Ew dilê ti kesî nahêle û wî naêşîne. Kî wî diêşîne, ew wî efû dike. Lewra ew dizane bê hedd û hesab xeta û qusûrên wî li hemberî cenabê Heq Teala hene. Lewra ew difikre ku heke ew li vî sûc û curmê li dijî xwe nebûre û wan efû neke, gelo ewê bi çi rûyî ji bo curm û sûcên xwe yên li hemberê Rebbê alemê ef û meğfîreta xwe bixwaze?

Ew mirovên din her efû dike û her efû dike, ji bo xwe bixe mûsteheqê lêbûrîn û efûkirina Xuda Teala. Ev, ji bo mûmînên kamil, ufûq û asoyeke jêneger a îmanê ye.

Serkeftina heqîqî ew e; kî zulm li te kiribe, tu bikarî wî efû bikî û tu di dilê xwe de jî li hemberî wî hest bi hêrs û qehreke biçûçik jî nekî.

206 Maîde, 5/54.

Li alîyê din jî, efûkirina ji bo Xuda Teala yek ji mezintirîn xuyahîyên mehebbetûllahî ye. Heke ev cure tezahur û xuyahîyên mehebbetê neyên nîşandan, îddîayên mehebbetûllahê her di xeberdanê tenê de dimîne.

Di nav mûraqebê de her mûmîn bi qasî îdrak, têgihiştin, qabilîyet û semîmîyeta xwe li ser van ayetên pîroz tefekkur dike û feyzê ji wan digre. Ew her hewl dide ji bo di nav zemanî de bigihe wê asta ku bikare temamê Qur'ana Pîroz bi tefekkurê bixwîne.

Evd di netîceya mûraqebeyan de, berê alema derûnîya xwe dide Ellah Teala û dilê xwe bi dîgerên Ellah Teala meşğûl nake. Ew fermana Xuda li pêşîya her tiştî digre. Ew zimanê xwe bi zikrê Xuda Teala meşğûl dike.

Evdekî sadiq, dişibihe wî zarokê ku dilê wî bi pêlîza wî ve ye. Dema zarok radize bi hezkirina pêlîza xwe radize, dema ew ji xew radibe jî bi lêgerîna li pêlîza xwe radibe. Ha mirina însanekî û ji qebrê rabûna wî û çûna wî ji bo mehşerê jî eynî wiha dibe. Ji ber vê sedemê bila însan, diqqet bike ka êvarê ew bi çi derdê radize. Heke hemû fikra mûmînekî li heyatê Ellah Teala be, mirina wî û ji nû ve sağbûna wî jî dê li ser wê îstîqametê be ku Ellah Teala jê razî ye.

Di hedîsa şerîf de wiha hatiye gotin:

*“Însan li dinyayê li ser çi halî miribe, roja qîyametê jî li ser wî halî tê sağkirin.”*[207]

Hedîseke din jî dibêje:

“*Hûn çawa bijîn, hûnê wisan bimrin jî, hûn çawa bimrin, hûnê wisan bêne sağkirin jî!*”[208]

Heke himmet û arzûya şexsekî tişteke ji bilî Xuda Teala be, dê mirina wî û ji nû ve sağbûna wî jî di wê rê de bibe. Ew roja qîyametê ji bo xwe ti piştevan û arîkarekî jî nabîne.

Divê mirov xwe bi zikr û tefekkurê meşq û fêr bike ji bo karibe tam halê mûraqebê bidest bixe.

Çawa ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ferman dike, dibêje:

« احفظَ اللَّهَ تَجِدْهُ أَمَامَكَ ، تَعَرَّفْ إِلَى اللّهِ في الرَّخَاءِ يعرِفْكَ في الشّدةِ ، واعْلَمْ أَنّ مَا أَخْطَأَكَ لَمْ يَكُنْ لِيُصيبَك ، وَمَا أَصَابَكَ لمْ يَكُن لِيُخْطِئَكَ واعْلَمْ أنّ النَّصْرَ مَعَ الصَّبْرِ ، وأَنَّ الْفَرَجَ مَعَ الْكَرْب ، وأَنَّ مَعَ الْعُسرِ يُسْراً »

**“Tu, Xuda Teala li ber çavê xwe bigre, tu yê wî li pêşberî xwe bibînî! Tu, Xuda Teala di ferehîyê de nas bike, ewê te di tengasîyê de nas bike. Zanibe, tişta ku ji te derbas bûye, ji xwe ew nebû ku li te bikeve. Tişta**

207 Muslim, Cennet, 83.
208 Mûnawî, Feyzûl Qedîr, V, 663.

**ku li te ketibe jî ji xwe ew nebû ku ji te derbas bibe. Zanibe ku serkeftin digel sebrê ye. Ferec digel kerbê ye û digel tengasîyê jî ferehî heye."**[209]

Divê mirov edeb û şertên wê tam rîayet bike û wan li ber çavan bigre da ku mirov tam bi maneya wê karibe ji tefekkur, zikr û mûraqebê îstîfade bike. Yek ji van edeban jî ev e ku mirov ji bo wan jî demên hizûr û aramîya xwe bibijêre; ne demên tengasîyê yên wekî birçîbûn, hêrsbûn û xewê, ewên ku di wan de qelbê mirov meşğûl be.

209 Ehmed, c 1, 307.



# EDEBA TEFEKKURÊ

Hemû mexlûqat neynika tecellîyatên îlahî ne, bi destê şîyan û qudretê li pêşîya îdrak, şiûr û hesta însan hatine girtin. Têgihiştin û îdraka sirr, raz û hikmetên ku di vê neynikê de hene jî bi paqijbûn, ronakî û berraqîya dil ve girêdayî û pêbend in.

Xet û herka îşqa îlahî ya ku ji jorê ve vedirêje, di têlên îmana qelbî re derbas dibe. Însan bi awayekî adetî neynika endamê vê cîhanê ye. Ew deq û nuqta nifûza tecellîyatên heqîqî yên îlahî ye. Îslam ji bo mirovên ku bi tefekkurê digihin kemalê, demsala bihareke ebedî ye.

# EDEBA TEFEKKURÊ

### Tefekkura Dost û Hezkirîyên Heq Teala

**Hezretê Ebûbekr** [Xuda jê razî be] rojekê, roja qiyametê anî bîra xwe û di bara mîzan, cennet, cehennem, sef bi sef rêzbûna melaîketan, li hev tewandina asîmanan û tavê, pêçandina stêran, hûr-hêrabûna çîyayan de kûr kûr tefekkur kir. Paşê ji tirsa Xuda wiha got;

“-Min çi qeder dixwest ku ez şînahîyek ji van şînahîyan bibûma, heywanek jî bihata ez bixwarama û ez nehatama aferandin!”

Ji lewma ev ayeta pîroz ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re hate xwarê:

**“Ji bo kesê ku ji rawestana li ber destên Rebbê xwe ditirse, du cennet hene.”**[210]

Dîsa Ebûbekr [Xuda jê razî be] di hewayeke vekirî û berraq de derketibû derve. Ew li asîmanî dinêre, ew

210 Rehman, 55/46. (Suyûtî, Lubabûn-Nuqûl, II, 146; Alûsî, XXVII, 117)

xweza, sirişt û tebîetê ku Xuda bi hezar û yek sipehî-tahîyan ji evdên xwe re aferandî, temaşe û seyr dikir. Di vê navêde çavê wî li çûkekî ket; wî li ser çiqilê darê danîbû û bi dengê xwe yê xweş şîrîn şîrîn dikir çîqe çîq. Nagihan ew ğemgîn bû û keserek kişand dilê xwe. Bi ğibte li çûkî meyzand û jê re wiha got:

"-Xwezîya me bi te, hey çûko! Qesem bi Xuda ye, min jî dixwest wekî te bim. Tu li ser darê datînî, ji meywe û fêkîyên wê dixwî, paşê jî tu difirî û diçî. Ne hesab ji te re heye, ne jî ezab! Qesem bi Xuda ye, ji bedêla ku ez însan bim û hesab ji min bê pirsîn, min ji dil û can dixwest ku ez darek bim li kêleka rê, hêştir di ber min re derbas bibe, min bigre, bixe devê xwe, bixwe, paşê min daqurpîne."[211]

**Hezretê 'Elî** [Xuda jê razî be] wiha dibêje:

"Fiqhzanê bi rastî fiqhzan ew kes e ku hêvîya mirovan ji rehma Xuda nade birrîn. Di bêemrîya Xuda de ruxsetê nade wan û wan ji ezabê Xuda ewle û emîn nake. Dilê xwe naxe ğeyrê wê û Qur'anê terk nake. Xêr di wî îbadetî de nîn e ku têde îlm û fehm nebe, di wê qîraetê de xêr nîn e ku têde tedebbur nebe."[212]

Ev îfade jî gotinên bi hikmet, yên **Hezretê 'Elî** [Xuda jê razî be] ne:

211 Îbn Ebûşeybe, Mûsennef, VIII, 144.
212 Sunenu Ed-Darimî, Mûqeddîme, 29.

**1**] Di nimêja ku bi xuşûê [tirsê] nehatibe edakirin de,

**2**] Di rojîya ku ji bizav û peyvên pûç nehatibe dûrkirin de,

**3**] Di qîraeta bê tefekkur de,

**4**] Di îlmê ku têde hesta wer'ê nebe de,

**5**] Di mala ku têde sexawet [camêrî] nebe de,

**6**] Di biratîya ku têde mûhafeze nebe de,

**7**] Di nîmeta ku ne baqî [mayendetî] be de,

**8**] Di dûaya ku têde îxlas nebe de, xêr nîn e.[213]

Dîsa **Hezretê 'Elî** [Xuda jê razî be] bi nêrîna îbretê li her tiştê dinêre, dirêj dirêj tefekkur dikir. Ew her wekî zarokekî sêwî ji tirsa Xuda digirî û wekî mirovekî nexweş her dilerizî. Wî zehf ji îbadetê hez dikir û li ser zuhdê jî her berdewam dikir. Wî ji hindik-xwarinê û zehf xêr-hesenat-kirinê hez dikir. Wî dîn ji her tiştî ezîztir digirt. Wî wiha digot:

"Temamê xêrê di van çar tiştan de ye: **Huşbûn, Axaftin, Nêrîn** û **Bizav**. Her axaftina ku zikrê îlahî têde nebe, pûç e. Huşbûneke ji tefekkurê dûr halekî xeta ye. Her nêrîna ku ne ji bo îbretê be, ğeflet e. Her bizava ku mirov neajoyê ser îbadetê ji Xuda re, ebûstî

213 Îbnû Hecer, Mûnebbîhat, s. 31.

û hemaqet e. Rehma Xuda li wî kesî be ku axaftina wî zikr be, huşbûna wî tefekkur be, nêrîna wî îbret be û bizava wî jî îbadet be! Însan ji dest û zimanên yên wiha, di selametîyê de dibin."[214]

Sehabîyê camêr Îbnû Mesûd [Xuda jê razî be] ehlê Qur'anê wiha dide naskirin û dibêje:

"...Dema însan razayî bin, divê hafizê Qur'anê bi şev nimêj û şev-xwendina xwe were naskirin. Dema ew bêrojî bin jî divê ew bi roj, rojî-girtina xwe were naskirin. Dema însan keyfxweşîyê bikin, divê ew bi ğemgînîya xwe were naskirin. Dema însan bikenin, divê ew bi girîyê xwe were naskirin. Dema însan tevlîhev bibin û bi hev re biaxivin divê hafizê Qur'an jiberkirî bi sikût û huşbûna xwe were naskirin. Dema însan xwe qure bikin divê ew bi tirsa xwe ya ji Xuda were naskirin. Divê hafizê Qur'anê bi girî be, mehzûn be, hekîm be, helîm be, zana be. Hêstirên çavê yê ku Qur'an jiber kiribe sipehîtiya wan cudatir e. Divê mirovê ku hafiz [Qur'an-jiber] be, weqûr [sergiran] be, di halê sikût û tefekkurê de be, kesayetî û exlaqekî bilind nîşan bide..."[215]

Dema mirovekî ev pirs ji Ummûd-Derda [Xuda jê razî be] kir:

214 Ebûnesr Serrac, Tûsî, el-Luma/Tesewwufa Îslamê, tercüme, H. Kamil Yılmaz, Îstanbul 1996, s. 137-140.

215 Ebû-nûeym, Hilye, 1, 130.

“-Çêtirîn îbadetê ku Hezretê Ebûd-Derda giringî didayê kîjan bû?” Wê wiha got:

“-Tefekkur û di encama wê de jî îbret-girtin bûye!”[216]

‘Amir bin Ebdîqeysê ku yek ji mezinê tabiîna ye, wiha gotiye:

“Min ne ji yekî, ne ji duduyan û ne ji sisêyan, ji gellek sehabîyên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bihîst ku digotin; ronahî dana îmanê, yan jî zêdebûna nûra îmanê bi tefekkurê mûmkin dibe.”[217]

Dema yekî ji wan ji Hezretê Rebîî kurê Xeysem pirs kir û jê re got;

“-Tu, dikarî mirovekî ji xwe çêtir ji me re bidî naskirin?” Wî jê re wiha got:

“-Belê, ewê ku axaftina wî zikr be, huşbûna wî tefekkur be û nêrîna wî ibret be, ew ji min çêtir e.”[218]

Ebû Suleyman ed-Daranî wiha dibêje:

“Çavên xwe hînî girî û qelbê xwe jî hînî tefekkurê bikin!”

“Tefekkur kirina li ser dinyayê, perdê dixe navbera mirov û axretê û ew ji bo ehlê welîtîyê jî xesareteke ğemnak e. Tefekkur kirina li ser axretê jî dibe sersebeb

216 Weq‘î bin Cerrah, Zuhd, s. 474.
217 Îbnû Kesîr, 1, 448; Suyûtî, ed-Durrû’l-Mensûr, II, 409 (Alî Îmran, 3/190.
218 Îbnû Henbel, Zuhd, s. 334; Ebû-nûeym, Hîlye, II, 106.

ku di însan de ronahîyên hikmetê biwelidin û ew qelbê însan jî îhya dikin."[219]

**Hezretê Yûsufê Hemedanî** wiha dibêje:

"Dema di însan de tefekkura îmanî biberizîne û biwelide, di pey wê de jî emelên salih tên. Bi hev re kirina van herduyan, yanî bi hev re komkirina emel û tefekkurê çawa mûmkin be, divê mirov wan herduyan wisan bi yek bike."[220]

**Fûdeyl kurê Iyaz** [rehma xuda lêbe] wiha dibêje:

"Tefekkur, her wekî neynika ezemet û hukmranîya îlahî ye; ew xêr û hesenat û şer û seyyîatên te, ji te re nîşan dide."[221]

Mûhemmed kurê Ebdûllah jî wiha gotiye:

"Tefekkur pênc cure ne:

**1**- Tefekkur kirina di ayetên Xuda de, ewa ku merîfet jê tê meydanê.

**2**- Tefekkur kirina di nîmetên Xuda de ewa ku mehebbet jê tê meydanê.

**3**- Tefekkur kirina di we'd û sewabên Xuda de ewa ku reğbet jê tê meydanê.

---

219 Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 45.
220 Yûsuf el-Hemedanî, Rutbetû'l-Heyat, wergêr. Necdet Tosun, Îstanbul, 2002, s. 60.
221 Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 44.

**4**- Tefekkur kirina di we‘îd, gef û cezayên Xuda de ewa ku rebet û tirs jê tê meydanê.

**5**- Tefekkur kirina di cefa û înkarkarîya nefsan li hemberî îhsanên Xuda de, ewa ku heya û poşmanî jê tê meydanê.”

Ehlê Hikmetê [Ebûtalib el-Qadî] jî wiha gotiye:

“Ew tişta ku hemû xêr û qencîyan tîne cem hev, dirêj dirêj tefekkur kirin e. Sikût, selametî ye. Noqbûna di batil de jî huzn û poşmanîyeke ğemnak e. Kî ji axretê ğafil bimîne û ji arzûyên xwe yên nefsanî re ram [teslîm] bibe, ewê roja qîyametê ji xwe bi xwe re bibêje; “xwelî li serê te be!” û ewê bi çikûsî bixwaze ku ew tine bibe û biçe helakê..”[222]

## Herikandina Çemê Tefekkurê bi Ser Axa bi Bereket de

Cenabê Heq Teala qabilîyeta tefekkurê daye her evdê xwe. Di derûna her însanî de çemekî tefekkurê yê ku bi şireşir û xuşexuş dikişe mewcûd e. Ev çem, hîç ranaweste, ew bi berdewamî her diherike û dikişe. Dema mirov berê wî bi ser deverekî ve nede û wî û halê wî ji hev re bihêle, nayê zanîn ka ewê bi kuderê ve bikişe û biherike. Vêca rast-şaş, ewê bi her deverê ve biçe. Carina jî ewê di çolên ziwa de winda û sergom

222 Beyheqî, Şûeb, VII, 417/10812; IV, 272/5070.

bibe. Bi îfade û vegotineke din; ewê her wekî qefokên ku bi ber lehîyê ketibin ber bi encameke mechûl û nedîyar ve were ajotin.

Mehareta esasî ew e; mirov berê çemê tefekkurê bide ser axa bi xêr û bêr û mehsûl û berên bi bereket biçîne, xwedî bike.

Cenabê Heq Teala wan mirovên ku nîmetên tefekkur û tehessusê di îstîqameta rizaya îlahî de bikar nayênin wiha îqaz û şîyar dike, dibêje:

**"Bi rastî li cem Ellah, candarên xirabtirîn kerr û lal in; ewên ku fehm nakin."**[223]

Heq Teala di ayeteke din de jî wiha dibêje:

**"Sûnd be, me gellek ji cin û însan ji bo cehennemê aferandine; dilên wan heye; pê fehm nakin, çavên wan hene; pê nabînin û guhên wan hene; pê nabihîzin. Ha ew, mîna heywanan e, belkî hê jî rêşaştir in. Ha ew, ğafil bi xwe ne!"**[224]

Qelb wekî neynikê ye; ew bi ğeflet û înkarê reş dibe û jengar digre. Cîla-ya wî, ew e ku ew pêşî Xuda Teala tesdîq bike, paşê jî ew bi hezkirin û mehebbetê berê xwe bide wî. Ji hindikahî ve; divê însan bersiva van pirsan: "Em çima hatine dinyayê? Em di milkê kê de dijîn? Kî rizqê me dide? Rêwîtîya me bi kuderê ve

223 Enfal, 8/22.
224 'Eraf, 7/179.

ye?" bifikrin. Naxwe ew kesê ku ji van heqîqetan bi awayekî dûr, xwe di jîyaneke nefsanî de noq kiribe, bike û qelbê xwe bi naskirina Heq Teala û tefekkurkirina delîlên hebûna wî meşğûl kiribe û bike, ew rêwîyê encameke hezîn û ğemnak e.

Ev curê însan, li hemberî nîmetên îlahî yên ku heqîqetê bi lîsanekî zelal derdixin holê, xwe nedîtî dikin û li ser wan nafikrin. Bi vê sedemê, ew ji bo sembol û nimûne di ğeflet û delaletê de bi "heywanan" hatine teşbîhkirin. Lewra temamê arzûya wan, xwarin, vexwarin û bicihanîna daxwazên nefsanî yên wan e.

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**"Ma te ewê ku ji xwe re hewesa xwe kiriye îlah dîtiye? Vêca ma tu dê bibî parêzgarê wî? Yan jî, ma ji te were ku pirrên wan dibihîzin, yan jî fehm dikin? Bi rastî ew mîna çarpêyan e. Ji xwe ji alîyê rê ve ji çarpêyan jî rêşaştir in!"**[225]

Dostekî Heq Teala jî wiha dibêje:

*"Ev alem, ji bo xwedî eqilan [eqilmendên ku difikrin û îbret digrin] temaşegeha ciwanîyên hunerê îlahî ye, ew ji bo ehmeqan jî cihê xwarin û şehwetê ye."*

Li alîyê din jî tefekkur -wekî ku me berê jî îfade kiribû- wekî kêreke dudev e. Ew dikare hem ji bo xêrê,

225 Furqan, 25/43-44.

hem jî ji bo şerrê xizmetê bike. Ew dikeve fermana arzûyên sûflî [nizmî] yên nefsê jî, dikeve fermana ulwîyên [bilindîyên] rûhanî jî... Cenabê Heq Teala wan mirovên ku qabîlîyetên xwe yên tefekkurê di rêyên xirabîyê de bikartînin jî wiha îqaz dike û dibêje:

**"Bêyî destûra Ellah ti kes nikare îmanê bîne. Ew, pîsîtahîyê bi ser yên ku eqilê xwe sipehî bikar nayênin de berdide."**[226]

Mezintirîn pîsîtahîya ku gihaye însan jî êş û nexweşîya înkarê ye. Ew kesên ku zêhnê xwe û dilên xwe bi ayetên kewnî û kelamî yên Xuda Teala re meşğûl nakin, li ser wan nahizirin û bîra wan nabin, ji vê pîsîtahîyê xilas û rizgar nabin.

Ew eqlên ku bi ronahî û nûra îmanê xwedî dibin û di rêbertîya wehîyê de tên bikaranîn, rêya Tewhîd [yek-bawerkirina Xuda] û naskirina Xuda Teala dibînin. Lêbelê ew eqlên ku ji vê mehrûm û bêpar bin jî, nagihin heq û xêrê. Ji xwe mezintirîn xapîna wan fîlozofên ku wehîyê esas nagrin û zen dikin ku ewê karibin bi eqlê xwe heqîqetê bibînin jî ev e. Lewra ew zen dikin ku eqlên ji wehîyê dûr jî dikarin ji bo heq û xêrê rê bibînin.

Li alîyê din jî ji bo mirov zanibe nîmeta tefekkurê rast bikarbîne divê mirov eqlê xwe û dilê xwe di tiştên malayanî [pûç] de meşğûl neke. Çawa ku di ayetên pîroz de wisan tê gotin:

226 Yûnus, 10/100.

**"Ewên ku berê xwe ji kelevajiyan vedigerînin."**[227]

Heq Teala di ayeteke din de jî wiha dibêje:

**"Ew in ku şehdebûniya derew nedin û dema di ber kelevajiyê re derbas dibin jî bi camêrî derbas bibin."**[228]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî di hedîseke şerîf de wiha dibêje:

*"Terka tiştên ku însan elaqedar nakin ji sipehîbûna mislimantîya wî ye."*[229]

Bi tesîrtirîn û bi bandortirîn îlac û dermanê êş û nexweşîyên nefsanî, himbiz û tîrkirina tefekkura şexsê li ser tiştên bifeyde ye û xwe dûrkirina ji meşğûlbûna bi tiştên ku feyde nadin mirov e û mirov elaqedar nakin. Tefekkur-kirina li ser tiştên malayanî pûç û bi kêrî dîn û dinyaya mirovan nayên] derîyê hemû xirabî, hezîmet [têkçûn] û zilletan e.. Ewên ku li ser tiştên bêfeyde difikrin, ji tiştên bifeyde û bihavil dimînin û ji tiştên ku ji bo wan lazim jî mehrûm û bêpar dimînin.

**Îbnûl-Cewzî** wiha dibêje;

"Hizirîna qelb di mûbahatan de di wî de zulmetê tîne meydanê. Vêca hizirîna wî di heraman de û plan-danîna wî ji bo wan dê encameke çawa bîne meydanê,

227 Mû'mînûn, 23/3.
228 Furqan, 25/72.
229 Tirmizî, Zuhd, 11; Îbnû Mace, Fîten, 12.

ew jî tu wê bifikre! Heke misk wesfên avê biguherîne û ji bo desmêj-girtina bi wê bibe asteng, vêca halê ava ku se ew leqandibe jî tu wê bifikre! Ha ji ber vê ye ku yek ji mezinan wiha dibêje:*'Ew kesê ku kirina mûbahatan ji xwe re kiribe adet, ji lezzeta wuslatê mehrûm dimîne.'* "[230]

Heke însan, berê hêza tefekkur, tehessus, texeyyul û tesewwura xwe nede ser xêrê, Şeytan dê berê fikra wî bide ser xirabîyê. Ji lewma ew însan nabe xwediyê nîmeteke tefekkura Rehmanî. Ew di şûna ku ji qabilîyetên eqlî û qelbî yên ku cenabê Heq Teala jê re bexş kirine, feyde bibîne, zirarê ji wan dibîne.

Naxwe divê mûmîn tim û daîm eqlê xwe û fikrê xwe di wê îstîqameta ku Qur'ana Pîroz û Sunneta Senîyye nîşan didin de ji bo heq û xêrê biwestîne.

## Divê Tefekkur Bi Zikr Re Be

**Yûsufê Hemedanî** [quddîse sirrûhû] wiha dibêje:

"Qelb û zikr wekî dar û avê ne. Qelb û tefekkur jî wekî dar û fêkî ne. Ebes û şaş e ku mirov avê nede darê û hêvîya şînbûnê jê bike; mirov fêkî û meywe jê bixwaze; lê bêyî li hêvîya wê raweste, heta ew pel û çîçekên xwe bel bike û veke. Heta heke em van jê bixwazin jî ew hîç meywe nade. Lewra ew çağ, ne wextê meywe ye; lê wextê xwedîkirin û sağkirina darê ye. Naxwe divê

230 Bûrsewî, Rûhûl Beyan, Mû'mînûn, 23/51.

tu avê bidiyê, tu wê ji giyayên zirardar û tiştên ecnebî paqij bikî, paşê divê tu li hêvîya rohnî û germîya tavê rawestî. Dema ev tev bicih bên, dar dê taze û geş bibe û ewê bi pelên kesk werê mûzeyyen-kirin. Piştî dar bi vê cemal û sipehîtîyê hat xemilandin, paşê rast û di cihê wê de ye ku mirov ji çiqilên wê meywe û fêkîyan bixwaze. Êdî ev dem, tam zemanê meywe ye."[231]

**Hezretê Hesenê Besrî** wiha dibêje:

"Kesên eqilmend, xwe bi zikrê hînî tefekkurê dikin û xwe bi tefekkurê jî hînî zikrê dikin. Di encamê de ew qelbên xwe didin axaftin. Piştî vê, êdî qelbên wan destpê dike tim bi hikmetê dipeyive."[232]

**Welhasil;** divê zikr û tefekkur ji hev neyên cuda-kirin. Di zikrê de xusûsa mûhîmtirîn, mirov wî bi şiûr bike û meneya wî jî tefekkur bike. Bi îfadeya welîyê mezin **Hezretê Mûhemmed Parsa,** dema mirov di zikrê kelîma Tewhîdê; "La îlahe" [ti îlahê din nîn in] dibêje, divê mirov bifikre ku hemû mexlûqat fanî û mirok in, mirov tevan tine bijmêre, mirov her tiştê ji bilî Ellah Teala ji zêhnê xwe û dilê xwe dûr bike û mirov fikr û hestên xwe temîz û paqij bike. Divê qelb bi hest û îdraka ku ew ji cenabê Heq Teala pê ve ji tiştekî din re nebe kole, were dagirtin. Dema mirov "îllellah" [Ellah tenê heye] dibêje, divê mirov bifikre

231 Rutbetu'l-Heyat, s. 71.
232 Îmam Ğezalî, Îhya, VI, 46.

ku hebûna Ellah qedîm e, ew ebedî ye û ew yekane hebûn e ku mirov bi hezkirin û mûhebbet berê xwe bide wî. Bi vî awayî, sifetên cemalî yên cenabê Heq Teala dê di wî qelbî de tecellî û xuya bibin.

**Behaûddîn Neqşîbendî** [quddîse sirrûh] jî wiha dibêje:

"Ji Zikrê meqsed, ne sade gotina "Ellah" û "La îlahe îllellah" e. Belkî mirov ji sebebî biçe mûsebbibî [ji sebebî here failê eslî Ellah] û bibîne ku nîmet ji mûsebbibî hatiye."

Yanî heqîqeta zikr, mirov ji meydana ğefletê bi ber ufûqa mûşahedê ve hilgere.

**Mewlana** [quddîse sirrûh] jî wiha dibêje:

*"Rebbê me, ew yekê bi tenê, ewê ku hemta û nezîrê wî nîn in, ji me re destûr daye û gotiye:" "Zikrê Xuda bikin! Wî em din av êgir de dîtin û nûr ji me re îhsan kir.. Ew zikrê ku bê tefekkur û bê hiskirin bi dev û ziman tenê tê kirin, xeyaleke nuqsan e. Lêbelê ew zikrê ku bi padîşahî yanî bi rûh û dil, bi hesta heyran mayînê hatibe kirin, ji peyv û gotinan paqij bûye."*[233]

Di wî kesê ku nav û sifetên Xuda Teala bi tefekkurê zikr dike de bi demê re mehebbet û hezkirina Xuda Teala zêde dibe. Lewra zikr kirina Xuda Teala ne sade dubarekirin û gotina lefzê Ellah tenê ye, lêbelê bi

233 Mesnewî, c, 2, beyt; 1709, 1712.

cih-kirina mehebbeta wî di qelb de ye ku ew merkez û navenda îdrak û têgihiştinê ye.

Însan bi xêra Zikr û tefekkurê pêşî digihîje mehebbetûllahê, paşê ew bi xêra mehebbetûllahê, destpê dike nav û sifetên Xuda Teala baştir nas dike. Di encama vê de cenabê Heq Teala ji wî hez dike û wî ji xwe re dike dost. Çawa ku Heq Teala di hedîseke qudsî de wiha dibêje:

*"Ji nav evdên min welîyên min û ji nav mexlûqatên min jî ewên ku min zikr dikin, ez jî li hemberê zikrê wan, wan bi bîr tînim."*[234]

Zikr sê beş e:

Zikrê bi zimanî.

Zikrê bi bedenê.

Zikrê bi qelb.

**Zikrê bi zimanî** ew e; mirov Xuda Teala bi sifet û navên wî yên sipehîtin bîne bîra xwe, hemdê wî bike, wî pak bidêre û tesbîh bike, kitêba wî bixwîne û dûa ji wî bike.

**Zikrê bi bedenê,** ew e; çi ferman li her endam û azayekî mirov hatibe kirin, mirov bi wê meşğûl bibe, bilebike û xwe ji heram û qedeğeyên wî dûr bike, biparêze.

234 Ehmed, III, 430.

**Zikrê bi qelb** jî **Elmalî Hemdî Efendî** wê wiha îzah dike:

"Zikrê bi qelb, ew e mirov ji dilê xwe Xuda Teala bîne bîra xwe. Ew jî sê komên serekeyî ne:

**1**] Fikrîna wan delîlan e ku zat û sifetên Xuda Teala nîşan didin û lêgerîna li bersiva wan şubhe û gumanan e ku di bara milkê wî de dikevin dilê mirov.

**2**] Tefekkur-kirina heqê Rebbê me yên ku li ser me hene û wezîfeyên me yên evdînîyê ne. Yanî tefekkur-kirina ferman û qedeğeyên Xuda Teala û delîl û hikmetên van e. [Lewra heke evd mahîyeta teklîfan/berpirsîyan û encama îtaeta fermanên îlahî zanibe, reğbeta wî ji bo kirina emelên salih hê zehftir çêdibe.]

**3**] Tefekkur-kirina di wan mexlûqatan de ku di alema navxweyî û alema derveyî de hene û tefekkur-kirina raz û sirrên xulqîyetê yên ku di van de hene û têgihiştin û îdrak kirina ku her zerreyek ji bo alema îlahî neynikek e. Divê nûr û ronahîyên alema cemal û celalê di wê neynikê de xuya bibe. Her çîkeke zewqa wijdanî ya ku di an û dema şiûr û hestpêkirinê de tê wergirtin, digihîje van aleman.

Nîhayet û dawîya vê merteba zikrê nîn e. Di vê nuqtê de însan ji xwe û ji alemê diçe. Temamê şiûr û hesta wî di Heq Teala de winda û berze dibe. Heta ti eser û elamet ji zikr û zakirî [ewê ku zikr

dike] namîne. Sade mezkûr [Heqê ku tê zikrkirin] tê hiskirin. Gerçî yên ku ji vî meqamî xeber didin zehf in; lêbelê ewên ku digihîjin vê ti elaqeya wan bi xeberdanê re nîn e."[235]

**Welhasil;** hemû heyber û mexlûqat, neynika tecellîyatên îlahî ne ku ew bi destê qudretê li pêşîya îdraka însan û hesta wî hatine girtin. Îdrak û hestpêkirina bi van raz, sirr û hikmetan jî bi paqijbûn û berraqbûna neynika qelb ve pêbend e.

## Ji Bo Zikr û Tefekkurê Bi Berekettirîn Dem, Seher in

Hezker, zehf behsa mehbûbê [hezkirîyê] xwe dike. Ew kesê ku zehf behsa tiştekî bike jî, piştî demekê destpê dike êdî zehftir jê hez dike. Mezinbûna hezkirinê bi fedakarîya ku di rêya mehbûbî de tê xerckirin, tê qiyaskirin. Lewra terka xewa xweşa di wextê seheran de jî, berê xwe dana Heq Teala û mûnacat-kirina bi wî re yek ji sipehîtirîn tezahur û xuyahîyên hezkirin û mehebbeta heqîqî ye.

Divê mirov bifikre ku di seheran de bi adetî rehma îlahî û ğufran tê hilgirtin. Bilbil, bi îlhama vê bereketa îlahî bi şîrîntirîn nağmeyên xwe dikin çîkeçîk û gulên ku çîçekên xwe yên rengareng vedikin jî

235 Heq Dînî Qur'an Dîlî, Beqere, 2/152.

xweştirîn bêhna xwe bi comerdî di wê wextê de îkram dikin. Çi hezîn û ğemnak e ku însan ji vê sifra rehma îlahî bêpar bimîne!

Bi qîmettirîn qismê rojê, wextên seherê ne ku ew jî piştî sêyeka dawîya şevê tê. Dema seherê ew zeman e ku zêhn ji meşğûlîyetan dûr dibe, qelb safî dibe, bêdengî her terefan dinixumîne û elaqeyên fanî jî zeîf dibin. Ev dem, ew zeman e ku rehma îlahî tê xwarê û Rebbê aleman ji hemû wextên din bêhtir ji evdên xwe nêzîk e. Demên seherê, ji bo mirovên ku tefekkur dikin û îbret digrin mûnasibtirîn û mûsaidtirîn zeman in ji bo îbret-girtinê. Lewra ev demên ha, ji meşğûlîyetan xalî dibin û qelb jî di wan de bi maneya kamil dikare berê xwe bide Xuda Teala. Ji bo tefekkurê ew dema ji hemû deman berhemdartir û bi berekettir e.

Cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**"Hey Pêğemberê ku cil li xwe werdaye! Rabe nimêja şevê, lêbelê ne temamê şevê; nîvê wê, yan ji wê jî kêmtir rabe nimêj bike, yan ji nîvê wê zêdetir rabe nimêj bike û Qur'anê bi tertîl; (hêdî hêdî rind û bi tefekkur) bixwîne. Lewra emê gotineke giran, ji te re bişînin. Bêguman rabûna şevê ji ya rojê ahengsaztir û xwendin zelaltir e. Lewra di çaxê rojê de, ji te re meşğuliyeteke dirêj heye; tu nikarî xwe ji bo îbadetê tenê xwerû bikî."**[236]

236 Mûzemmil, 73/1-7.

Li hemberî sikûnet û aramîya şevê, roj jî ew zeman in ku di wan de diqqet û bal tên belavkirin û deng û giregir zêde dibin. Ew kesê ku demên bi bandor yên şevê nanirxîne, nikare di nav meşğûlîyetên bi rojê de berê xwe bide Xuda Teala û ew nikare bigihîje rûhanîyet û feyza îbadetê ya ku di seheran de tehqîq dibe.

**Welhasil;** dema seherê, zemanê îtîna û îbret-girtinê ye, ji bo îbadetê hatiye terxan û texsîs-kirin. Bi roj jî, nîmeteke sipehî û ciwan e ku ji bo xizmetê û ji bo qezenckirina rizqê hatiye bexşkirin. Yanî divê mûmîn di wextê seherê de bi Xuda Teala tenê re bibe û di rojê de jî di nav xelkê de bi Heq Teala re bibe.

**Resûlûllah** [dirûd û silavên Xuda lê bin] di seherê de ku bi berekettirîn û bi feyztirîn dem e, hîç terka kirina nimêjê, xwendina Qur'anê û kirina dûa û tefekkurê, nekiriye. Ewqas giringî bi wextê seherê daye ku dema ew nexweş diket û ewqas bê taqet dibû ku êdî hew karibe rabe ser xwe jî dîsa wextê seherê ew rûdinişt û wisan ew dinirxand.[237]

Pêğemberê Xuda[dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo tefekkurê bi taybetî ji şevan îstîfade dikir. Ew, bi hêstir-barandina çavan şipya dima heta lingên wî diwerimîn û bi saetan di halê rikû û sicûdê de disekinî.

237 Binêrin; Ebûdawud, Tetew'u, 18.

**Îmam Hesen kurê Rûşeyq** wiha dibêje:

"Kilîleke ji vê mezintir nîn e ku tu di wextê seherê de rabî ser xwe ji bo bikarî derîyê Heq vekî û tu bikarî quflên deryaya tefekkurê vekî. Lewra însan di wî wextî de xwe ji elaqe û peywendiyên dinyaya fanî, meraq, derd û temakarîyên wê dûr dike. Ew dikeve wextê "bi Rebbê xwe re" bûnê. Bedena wî îstîrahet dike, ew bi xwe taze û zindî dibe.

**Welhasil;** wextên seherê, mûnasibtirîn û mûsaidtirîn zeman e ku dikeve navbera şev û rojê. Ciwantirîn û şîrîntirîn sirwe û nesîm di vî wextî de dibare û tê. Lewra di seheran de ronahî tarîtîyê di bin xwe de dinixumîne. Di şevê de jî rewş û wezîyet tam berevajîyê vê çêdibe. Tarîtî konê xwe li ser ronahîyê datîne û bi ser wê de dikeve."[238]

Heq Teala di ayeta pîroz de wiha dibêje:

**"Teniştên wan ji nivîngehên wan dûr dibe. Bi tirs û bi hêvî li ber Xudayê xwe digerin û ji rizqê ku me daye wan jî hinekê înfaq dikin."**[239]

Yek ji wan emelên salihê ku Xuda Teala jê hez dike û jê razî û memnûn dibe ev e ku mûmînek, di wextê seheran de ji bo gunehên xwe îstiğfar bike, ezabê Xuda Teala bifikre û hestyar bibe, mirinê bîne

238 Binêrin; Ebû-Ğudde, Zemanin Qîmetî.
239 Secde, 32/16.

bîra xwe, planê ji bo jîyana xwe ya mayî deyne ka ewê qismê wê yê mayî çawa binirxîne û li ser Qur'ana pîroz jî tefekkur bike.

Cenabê Heq Teala ev mizgînîya mûstesna daye wan evdên xwe yên ku bi vî awayî seheran îhya dikin û temen û emrekî înfaqê di rêya Xuda Teala de dijîn:

**"Hîç ti kes, wek xelata kirinên xwe nîmetên bînahiya çavan ya ku li ber wan hatine veşartin, nizane."**[240]

Pêğemberê Xuda[dirûd û silavên Xuda lê bin] ev ayeta pîroz wiha tefsîr kiriye: "Xuda Teala dibêje; min ji evdên xwe re nîmetên wisan amade kirine ku ti çavan ew nedîtine, ti guhan ew nebihîstine û ew neketine bîr û xeyala ti beşerekî!"[241]

Ji vê derê tê fehmkirin ku ew nîmetên Cennetê yên ku ji me re nehatine ragihandin ji wan nîmetên wê yên ku ji me re hatine ragihandin hê zehftir in. Di hinek rîwayetan de hatiye ragihandin gotin; heta melaîket û pêğember jî bi van nîmetan nizanin.

240 Secde, 32/17.
241 Buxarî, Bed'ul-Xelq, 8; Tefsîr, 32/1; Tewhîd, 35; Muslim, Cennet, 2-5.

# NETÎCE Û ENCAM

**Tefekkur, Kilîla Heqîqet û Xılasîyê ye**

Gihiştina Heqîqetê, bes bi tefekkur û îstidlalê [delîl-xwestinê] pêkan û mûmkin e. Ew kesê ku li hemberî dîtin û bihîstina delîlan, yanî nexşên qudreta îlahî û tecellîyatên ezemeta wî wekî kor û kerran bizav dike, ewê çawa bikare ya rast bibîne? Bi vê sebebê hatiye gotin; "heke pêzanîn û îlm hest û şiûran şîyar nake, naxwe ew nabe pêzanîn û îlm jî."

Cenabê Heq Teala rewşa wan kafirên ku heqîqetê nabînin di ayeta pîroz de wiha îfade dike, dibêje:

**"Bizane ku tu, nikarî bi miriyan bidî bihîstin û tu neşî doza xwe li wan kerrên ku pişta xwe dane aliyê te û direvin jî, bidî guhdarîkirin."**[242]

Ew însanê ku bawer dike ew ji afetên wehm, xeyal û hewesê salim bûye, heke ew bi eqlekî ku bi wehîyê terbîye bûye hewl bide ji bo nesîb û para xwe ji tevna

242 Neml, 27/80.

dilî û wijdanî ya mezinê me Mûhemmed [dirûd û silavên Xuda lê bin] wergire, bêşiwar ewê bigihîje Heq û xêrê.. Mûcîzeyên wî li terefekî bihêle, lêbelê heke ew bi awayekî layiq di exlaq û sîyera wî de jî tefekkur bike, ewê îdrak bike û xweş têbigihe ku hemin ew pêğemberekî sadiq e û ew tiştên ku wî xelk gazî wan kirin jî tev heq in û rast in. Di netîce û encama vê tefekkurê de bi destûr û îzna Xuda, ewê ji arzûyên nefsanî yên xwe û ji kolanên bingirtî yên eql jî xilas û rizgar bibe.

Cenabê Heq Teala rewş û poşmanîya ehlê cehennemê wiha dide zanîn û dibêje:

**“Ew li dojehê dikine feryad û dibêjin: "Xudayê me! Me derîne, emê karekî salih bikin ji bilî karê ku me dikir."**

**Ellah Teala jî ji wan re wiha dibêje:**

**"Ma me, temenekî wisan nedabû we ku kesê bixwaze bifikire karibe di wî de bifikire û di wî de şîret bigire? Ma hişyarker ji we re nehatibû? Naxwe de ezabê t‘am bikin! Ji zaliman re ti arîkar jî nîn in.”**[243]

Naxwe însan bi du rêyan digihîje heqîqet û felaha [rizgarbûna] ebedî:

**1**] Yan ewê mûmînên salih bibîne, ji wan re teslîm bibe û di çarçova feyz û rûhanîyata wan de îtaeta Heq Teala bike,

243 Fatir, 35/37.

**2]** Yan jî ewê qabilîyet û derfetên xwe yên tefekkur, tedebbur û tehessusê di îstîqameta Qur'ana Pîroz û Sunneta Senîyye de bikarbîne, rastîyê bibîne û nefsa xwe jî jê re stûxwehr bike. Heke ew hem ji ehlê heqîqetê re îtaet neke, hem jî bi însafî nefikre û di rêya ku eql wî nîşan dide de neçe, bêguman dawîya wî dê ketina ezabekî ğemnak be.

## Tefekkura Eslî, Îsbat kırına Hebûna Wacîbûl Wucûd e

Wekî ku me berî vêga jî îfade kiribû, ji bo însan ne mûmkin e ku ew zatê cenabê Heq Teala îdrak bike. Lewra rêya zanista beşerî hewasên Xemse ne/pênc hestpêker in û eql û qelb e. Şîyan û qudreta îdraka van hemû qabilîyetan jî tixûbdar e. Bi vê navgîn û wasîteya qudret û selahîyeta sînordar jî hebûneke Baqî, Mûtleq, Ezelî û Ebedî nayê îdrak û fehmkirin. Îdraka bi wasîteya mehdûd jî, bes ew jî mehdûd tehqîq dibe.

Ji ber vê, ji terefê Qur'an û Sunnetê ve meşğûlbûna bi karên ku ji taqeta beşerî derbas dibin her wekî fikrîna li ser zatê Xuda Teala û hewldana ji bo helkirin û çareserkirina hemû sirr û hikmetên Qederê, hatiye men û qedeğekirin. Çawa tefekkur nekirina heqîqetên îlahî sedemeke felaketê be, eynî wisan heke însan heddê xwe nizanibe û xwe li karên ku îmkan û qudreta wî derbas dikin jî rakişîne, ewê wî li xusraneke mezin bixe.

Ji ber vê sedemê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha gotiye:

*“Li ser mexlûqat û nîmetên Xuda Teala tefekkur bikin; lêbelê li ser zatê wî nefikrin! Lewra hûn, bi ti awayekî layiq nikarin qedrê wî teqdîr bikin.”*[244]

**Hezretê Mûhyeddîn Bin Erebî** jî dibêje:

*“Di bara Xuda Teala de çi were eqlê te, zanibe ku Xuda Teala ji bilî wê ye.”* Lewra yek ji wan heqîqetên ku Îslam wan dide hînkirin jî yek ji sifetên zatî yên Xuda Teala jî **“Mûxalefetûn lîl-Hewadîs”** e. Yanî Xuda Teala naşibihe tiştekî ji mexlûqatên xwe. Ji ber vê sedemê, dema em însanekî bi hinek sifetên xasê Xuda Teala yên her wekî alim û adil didin wesifkirin jî, bes ji ber bawerîya me ya ku bi sifetê Xuda Teala “mûxalefetûn lîl-hewadîs” heye, ew nabe şirk.

Digel ku me îmkan û derfet nîn e, em bikarin di heqîqeta zatê Xuda Teala bigihin jî; lê dîsa me îmkan û derfet hene ku ji tecellîyatên sifetên wî yên di kaînat û hedîsatan de em bi dil û eqlê xwe delîlan ji bo îsbatkirina hebûn û yekbûna Xuda Teala bînin û li ser wan waqif bibin. Wekî ku her mexlûqê îmkan û îqtîdar sînordar wisan e, ji bo însan jî tişta mûmkin bes ev tenê ye. Ev jî, ji bo mirov li cem Xuda Teala mûmîn were qebûlkirin kafî ye, têrê dike. Ji ber vê sedemê

244 Binêrin, Deylemî II, 56; Heysemî, I, 81; Beyheqî, Şûeb, I, 136.

ye ku alimên îslamê gotine: *"Zirwe û çêtirîna îlmê merîfetûllah e, yanî naskirina Xuda Teala ye."*

Bi rastî însan xwediyê îdrak û têgihiştinekê ye ku ew ji sifetî ber bi mewsûfî ve, ji eserê ber bi mûessirî ve, ji senetê ber bi senetkarî ve û ji sebebê ber bi mûsebbibî ve diçe. Însan bi vê rêyê, yanî li wan mexlûqatên wî û nîmetên wî yên ku wî ew lutf û bexş kirine û her yek ji wan jî xarîqûladeyeke hunerê ye, dinêre û li gorî îst'îdad [amadekarî] û îqtîdara [jêhatina] xwe dikare ezemet, qudret û rehma cenabê Heq Teala fehm bike. Yanî her kes bes bi qasî qama xwe û firağa xwe dikare avê ji okyanûsa merîfetûllahê bigre.

**Hezretê Mewlana** wiha dibêje:

*"Rojekê di min de arzûyeke wiha şîyar bû, min got; bila ez nûra Xuda Teala di mirovan de bibînim. Her wekî ku min dixwest deryayê di dilopê de û tavê jî di zerreyê de bibînim..."*

Heke însan, bi têgihiştin û îdrakeke selîm û bi tefekkur û tehessuseke semîmî li sifetên cenabê Heq Teala, fiêlên wî û eser û berhemên wî nezer bike û binêre, mirov hîç nafikre ku ew ji înkarkeran e. Lewra înkar, ji cihê ku failîyeta zêhnî û fikrî û hessasîyeta qelbî xirab dibe, destpê dike. Yanî ew kesê ku sağlem be û zêhn û qelbê wî li ser fitretê be, ne mûmkin e ku ew ber bi kufrê ve were ajotin. Heke wî kesî çavên xwe di alema kufrê de li heyatê vekiribe, xilasbûna wî

ji kufrê eger û îhtîmaleke bilind e. Ji bo vê jî nimûne û mîsal Hezretê Îbrahîm didin; lewra digel ku ew li hawîrdoreke mûşrik û pûtperest hatiye dinyayê û li wê mezin bûye jî dîsa wî sirf bi qabilîyetên xwe yên eqlî û qelbî hebûn û yekbûna Xuda Teala dîtibû. Ew jî di Qur'ana Pîroz de bi awayekî bi tefsîlat û kitekiteyî tê beyankirin.

Bi vê îtîbar û qebûlê, ji bo mirovê ku dikare bi tendurustî û sağlemî bifikre, ne mûmkin e ku ew bibe mûnkirê mûtleq. Lewra mirov nikare ji bo tiştekî bibêje "nîn e" û xwe ji nav vî karî derxîne. Lêbelê gereke ji bo wê îddîayê îsbat û delîlên rast û îqnakar hebin. Naxwe ewên ku heyat, kaînat û mûemmaya [asêpirsa] mirinê û ji wê biwêdetir çareser nekiribin, ew sade bi gotina "nîn e" di delîl û îsbata çi de ne? Ev rewş, dişibihe rewşa wan kesên ku mîdeya wan biçî bûbe; lêbelê ji ber ku sağlemî û tendurustîya wicûda wan xirab bûye, ew hest bi birçîbûnê nakin. Naxwe digel birçîbûna xwe jî gotina wan ya "em ne birçî ne" ew bes delîl û îsbata nexweşîya wan e.. Şexsekî ku sîstema wî ya rayan şeht û felc bûbe, yan jî ew hatibe narkoze-kirin, ew hest bi bizmara ku di laşê wî de çûbû, yan jî kêra ku wekî qumaşekî endam û azayên wî qut dike û didirûyê, nake û bi êşê nahese.

Cenabê Heq Teala di bara wan kesên ku li hemberî van heqîqetan rûh û gîyanê xwe nexweş kirine û ew hest bi vê nakin de jî van îfade û tebîran bikartîne

û dibêje: **"Ew kerr in, lal in, kor in. Lewra ew, êdî venagerin."**[245]

Lewra Xuda Teala di fitreta [aferandinîya] her însanî de îhtiyaca ji bo îmanê, lêgerîna li heqîqetê û îqtîdar û şîyana li ser gihiştina wê jî çandine û têde bicih kirine. Ji bo vê, bêxeberbûna ji îman û heqîqetê, yan jî bê-îrtîbatbûna ji wan, bes bi sebeb korîtîya rûhî û kerrîtîya wî ye. Heke ev nebe, rûhê wî kesê ku bawer nake jî amade ye ku Xuda Teala îdrak bike, yan jî ew di halê îdrakê de ye. Lêbelê wî bi sebebê korîtî û kerrîtîya xwe ya manewî nekariye vê xusûsîyet û taybetmendîya xwe derxîne ser şiûr û hestê. Ew jî eynî wekî wan xewna ye ku têne dîtin; lê nayêne bîra mirov.

Bi îfade û vegotineke din; meylkirina rûh û gîyanê însan ji bo îmanê tişteke fitrî ye û ev wek pêwîstî û îhtiyacekê, hîn ji zarokîtî û biçûkatî ve, her wekî birçîbûneke ku divê her were têrkirin û tetmînkirin derdikeve pêşberî me. Wek nimûne; zarokekî ku bavê xwe dibîne wa ye ew nimêj dike, ew di bara çawanî û keyfîyetê nimêjê de sûala pirsan nake. Ew ji ber ku bi awayekî mûcerred û xwerû mezinbûna Xuda Teala îdrak nake, hewl dide wê bi awayekî mûşexxes û nêreber îfade bike. Ew dipirse; Xuda çi qeder e? Ew meraq dike; mirî diçe kuderê? Ew dixwaze hîn bibe; Cennet û Cehennem cihê çawa ne? Ew tim û daîm di nav lêgerînekê de ye. Lewra manewîyat di fitreta însan de meknûz û veşartî

245 Beqere, 2/18.

ye. Dema ev îst'îdada veşartî derkeve ser şiûr û hestê, însan dibe mûmîn. Lêbelê dema ew di bin şiûr û hestê de were hebskirin û girtin jî hingê dibe kafir. Ew jî her wekî çûkekî ku di rekeh û qefesê de hatibe girtin, êdî heke çûk di piştî heyateke dirêja di rekeh û qefesê de were serbest berdan jî nikare bifire. Lewra êdî per û baskên wî kils û kirêç girtine. Eynî wekî vê, dema hissa îmanê jî dernekeve ser şiûr û hestê, qabilîyeta însan ya bawerkirinê jî kor û kuh dibe.

Ji ber vê, divê em bi qasî îmkan û jêhatina xwe Xudayê xwe yê ku em ji nebûnê anîne wicûdê nas bikin. Ji bo mirov bigihîje îrfan û merîfetûllahê jî, divê mirov bigihîje îllellah [ji Xuda pê ve ti îlah nîn in], ji bo vê jî divê mirov bi awayekî rast û durust sifet û fiêlên Xuda Teala îdrak bike.

Ellah Teala di her tiştî de xwediyê hikmetê ye, dema wî mezinê me pêğemberê xwe [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji mûşrikan re şand ji bo dînê wî ji wan re teblîğ bike; heke wî ayeta pêşî ji Qur'anê ji pêğemberê xwe [dirûd û silavên Xuda lê bin] re wiha bişanda: **"Bi navê Rebbê xwe bixwîne, ewê ku ti şirîkê wî nîn in, ti hemta û wekî wî nîn in"** vê dê bi xwe re îtîrazeke pêşî bi xwe re bianîya û îhtîmalên bi îmanê mûşerrefbûna wan îdrakên ku bi şirkê ve hatibûn şertkirin, zeîf dibû. Lêbelê cenabê Heq Teala bi sifetê xwe yê xelqkirinê dest bi axaftinê kir ji bo ti kes ji mûşrikan nikaribe îtîrazê li vê bike. Piştî wî ev da qebûlkirin, peyv anî ser xwediyê kirina "xuliqandinê" û wiha got: **"Bi navê**

**Rebbê xwe yê ku xuliqandiye, bixwîne!"**[246] Mûşrikan zanîbû ku pûtan tiştek nexuliqandine û neaferandine û wan bi xwe jî fehm kiribû ku îlahê heqîqî Ellah Teala ye û bes ew layiqê hemd û pesindayînê ye.

**Mûfessir el-Beydawî** dibêje: "Xudayê mezin di sûretê 'Eleq de bibîr tîne ku wî însan ji nizmtirîn mertebeyan ji bo bilindtirîn mertebeyan diguhêze. Bi vî awayî, ew pêşî îşaretê bi wê xulqîyetê dide ku ew bi rêya eql naskirina Xuda Teala nîşan dide. Ya duduyan jî ew balê dikişîne ser wê xwendin û nivîsandinê ku ew jî bi rêya bihîstinê [naskirina wî] nîşan dide. Yanî ew îlm û zanistên eqlî û neqlî bi yek dike."[247]

**Welhasil;** Cenabê Heq Teala tefekkur kirina li ser mexlûqatên xwe kiriye wesîle û navgîn ji bo mûşrik û mûnkir bikevin îslamê û bi îmanê mûşerref bibin. Naxwe tefekkur kirina mûmînan jî di vê xusûsê de ji bo xurtbûna îmana wan û zêdebûna yeqînîya wan wesîle û navgîn e.

## Her Tişt di halê Hereket û Guherînê de ye

Heke em bifikrin, emê bibînin ku di vê alema em dibînin û seyr dikin de her tişt diguhere. Ew ji rewşekê dikeve rewşeke dîtir. Wek nimûne; nutfe dibe eleqe, eleqe dibe mûdğe, mûdğe jî bi goşt û hestî werdi-

246 'Eleq, 96/1.
247 Beydawî, Tefsîr, sûretê 'Eleq, 96/5.

gere. Ev cure tehewwilat/guherîn, di stêran, kewkeban [strên gerok], madenan û giyayan de yanî di her tiştan de çêdibe.

Di nava Atomê de bizaveke birêkûpêk û mûezzem heye. Elektron bi hesabekî zehf hûr û bi lezeke ku nakeve eql û xeyalê vedigerin. Proton û Notron jî ku regezên wê yên kakilî ne, dema ew di hecmeke biçûktir de werin guvaştin, leza wan bi gorî elektronan fewqeladde zêde bilind dibe. Ew, leza wan ewqas zêde dibe ku kêm-zêde bilezeke ku di sanîyekê de ji 60.000 kîlometreyan vedigerin. Ev leza bilind, dibe sebeb ku ew bi awayekî wisan bi eql nakeve û di halekî wisan de werin dîtin her wekî ku "dilopên ron in dikelin û dibin kef".

Şair çi xweş îfade kiriye; zerreyeke tenê di veguhezîna ji eserê ji bo mûessirî de têrê dike:

*Ji bo naskirina te çi îhtiyac bi gurovera alemê heye,*

*Zerreyeke tenê ku te xuliqandî ji bo îsbata hebûna te, têrê dike.*

[Şînasî]

Heke em bînin bîra xwe ku di serê komeke derzîyan ya ku em wê mîlîmetreyeke çarçikî qebûl dikin de kêm-zêde 100 trîlyon atom hene, emê bêhtir îdrak bikin û têbigihin ka bizav û hereketên di kaînatê de eser û berhema şîyan û qudreteke çawa ne.

Ha, ji bo ev hemû hereket û guherîn werin meydanê îhtiyac bi mûessirekî heqîqî heye. Ew jî Ellah

Teala, Xellaqê Mûteal e. Lewra ev xarîqûladeyên ku eql dixin heyretê çêbûna wan bê hebûna mûessirekî, yan jî xuyabûna wan ji failekî bê şiûr, bêşiwar ne mûmkin e.

## Her Tişt Ji Bo Ğayekekê Hatiye Aferandin

Bi eşkerehî xuya dibe ku di vê alemê de her tişt ji bo hikmet û feydekekê hatiye aferandin û xuliqandin. Wekî ku me berê jî îfade kiribû;

-Mexlûqatên li ser dinyayê bi ronahîya tav û heyvê rohnî dibin û peyda û geş dibin. Bi gera dinya û heyvê li dora tavê wext û dem têne meydanê. Bi gera erdê mewsim, sal, roj û şev tên meydanê, bi gera heyvê jî mehtên meydanê.

-Hewaya ku em tim wê teneffus dikin, dikeve kezeba sipî û xwînê temîz dike. Ji ber ku îhtiyaca wicûda me ji her tiştî bêhtir bi wê heye, heta tu bibê bes ew hêsan û zehf peyda dibe.

-Ba ewran diajon û baranê dibin deverên ku îhtiyaca wan pê hebe. Yanî ba, giya û daran fetrîm dike, germahîyê eyar dike û hewayê paqij û temîz dike...

-Bi eynî awayî, feydeyên behr û deryayan jî bi jimartinê xilas nabin...

Ev hemû û çendîn xusûsên din yên ku em nikarin li vir bi jimartinê wan xilas bikin jî, giringî û ehemmîyeta wan di heyata însan de malûm û pêzan e. Ji ber

vê, însanê ku bi nezera îbretê li van seyr bike û li ser wan tefekkur bike, ewê bigihe vê netîce û encamê ku di aferandin û xuliqandina hemû tiştan de hikmet, ğaye û hedefeke mezin heye. Qebûlkirina van wek rasthatin û tesadufekê jî dibe pûçkirin û îbtalkirina eql, îz'an û însafê. Ev îlm û hikmet, esera zatekî ne, ku ew xwediyê qudret û ezemetê ye. Ew jî Ellah Teala ye.

## Ji Eynî Maddeyê Eserên Cuda Cuda Tên Meydanê

Heyberên cuda cuda yên ku em wan li hawîrdora xwe dibînin, eslê tevan eynî ye. Ew tev ji maddeyê hatine wicûdê. Regez û unsûrên cuda cuda tev perçeyên eynî mahîyetê ne. Wek nimûne; cismên asîmanî tev ji heman maddeyê tên meydanê. Lêbelê ji bo her yekê ji wan jî huwîyet [nasname], wezîyet [rewş], miqdar [tebab] û temen û emrekî wê yê mexsûs [taybet] heye. Qismek [beşek] ji wan sar in û qismekî din ji wan jî heta tu bibê bes germ in...

Ji regez û unsurên her wekî azot, karbon, oksîjen û hîdrojenê giya û heywan tên meydanê û çêdibin. Hal-hal e ku di navbera maddeyan û jiyanê de ji xwe nexasim di navbera wan û sifetên wekî îlm, îrade, qudret, bihîstin û dîtinê de hîç ti mûnasebetek nîn e.

Ha ev hemû xarîqûlade û şahaneyên hunerê îlahî ne. Ev qeder heyber û mexlûqatên cuda cuda

û mûkemmel yên ku em wan li kaînatê dibînin, ew berhem û eserê senetkar û hunermendekî mezin û xwedî qudret in. Hebûneke ku ev qeder xarîqûlade û şahaneyên hunerê anîne meydanê, ne mûmkin e ku ew bişibihe mexlûqên ku ew paşê hatine wicûdê. Ewê ku Wacîbûl-Wucûd e, yanî hebûna wî zerûrî ye, ji xwe bi xwe ye û ezelî ye, ha ew cenabê Heq Teala ye.

Welhasil; ji bo miroveki ku difikre hîç ne zor e ku ew Rebbê xwe bibîne û jê re heyran bimîne. Însan heke kafir be jî, bi xêra tefekkurê digihe îmanê. Lêbelê heke ew mûmîn be, ew sewîyê bi îmana wî dide qezenckirin; ew di mertebeyên merîfet û mehebbetê de dest bi pêşveçûnê dike.

### Rêya Merîfetûllahê

Alimên Kelamî gotine; "Ferza ku pêşî fermana wê li însan hatiye kirin, merîfetûllah e, yanî naskirina Xuda ye û berê xwe dana ser tefekkurê ye ku ew jî mirov dibe cem wî."

Meqseda esasî û giştî ya Qur'ana Pîroz jî azadkirina eql û qelban ji dagirkerîya ğeyrê Xuda û ajotin û tehfdana wan bi cem merîfetûllahê ve ye.

Xuda Teala însan aferandiye ji bo ew wî nas bike û jê re îbadet û koletîyê bike. Însan bi awayê sipehîtirîn dikare bi rêya zikr û tefekkurê bigihîje vê ğaye

û meqsedê. Îbadet, cewher û rasteqîneya jîyana însan e. Zikr jî sipehîtirîn awayê îbadetkirina ji Xuda re ye. Zikr û tefekkur jî her wekî du bira ne, ku ji hev û din cuda nabin.

Bêşiwar ji bo mirovan tişta mûhîmtirîn, gihiştina seadet û hizûra ebedî ye. Arzûyên din li ber vê ew qas ne giring in. Ji bo gihiştina seadet û hizûra ebedî jî mûhîmtirîn wesîle û navgîn **“merîfet”** e.

Zanîna îlmî, her rûdan û hadîsê ji rêya elaqeya sebeb û netîcê tefsîr dike. Merîfet jî, ji xwe ji wê tefsîrê zêdetir, di wê bûyerê de bi têgihiştin û îdraka tecellîyatên îradeya îlahî tehqîq û bicih dibe. Ji ber vê ye ku agahîya naskirina Xuda wek merîfetûllah tê binavkirin. Yanî ev jî fehmkirina hebûna Xuda bi pîvana merîfetê ye.

Ji ber vê sedemê di ayetên 84-87’an yên sûretê el-Mûmînûn de tefekkur berîya Teqwayê hatiye zikrkirin. Lewra însan, bi tefekkur û lêkolînê digihin merîfetê. Piştî ew bi awayekî layiqê wî Xuda Teala nas kirin, zanin ku divê ew xwe ji mûxalefeta wî biparêzin û bibin xwediyê teqwayê. Lewra bêyî bûna merîfetûllahê, yanî bêyî ku Xuda bi awayekî layiqê wî nas bikin ti kar û emelek biha û nirxekî îfade nake.

Çawa ku di vê babetê de cenabê Heq Teala wiha dibêje:

**"Bibêje: Heke bi rastî hûn dizanin, ev dinya û yên ku têde hene, yên kê ne? Ewê bibêjin: "Yên Ellah in!" Bibêje: Madem wisan e, naxwe çima hûn eqil nagirin?! Bibêje: Xudayê asîmanên heft tebeq û Xudayê 'Erşê Mezin kî ye? Ewê bibêjin: Ellah e! Bibêje: Naxwe ma hûn ji wî natirsin?"**[248]

**Welhasil;** bêşiwar îlmê ji hemû îlman çêtir merîfetûllah e.

**Cuneydê Beğdadî** [quddîse sirrûh] wiha gotiye:

"Heke min bizanîya ku di bin kumbeta asîmanî de ji wî îlmê ku ehlê merîfetê bi dûv wî dikevin îlmekî çêtir heye, ezê bi tiştekî din ve meşğûl nebûma, bê sekn û rawestan minê her hewl bida ji bo wî bi dest bixim."

**Îbnû Qeyyîm el-Cewzî** jî wiha dibêje:

"Cenabê Heq Teala di Qur'ana Pîroz de bi du rêyan evdên xwe gazî gihiştina merîfetûllahê dike:

**1.** Meyzandina li tiştên ku cenabê Heq Teala ew çêkirine û aferandine û fikirîna li ser wan e.

**2.** Tefekkur û tedebbur kirina li ser ayetên di Qur'ana Pîroz de ye.

Koma yekê ew ayetên Xuda Teala ne ku têne mûşahede û temaşekirin. Koma duduyan jî ew ayet in ku têne bihîstin û bi eql têne îdrak kirin.[249]

248 Mû'mînûn, 23/84-87.
249 Îbnû Qeyyîm, Fewaîd, s. 31-32.

Tefekkur û tehessus-kirina li ser van, însan digihîne îmana tehqîqî û berê wî dide ser meqseda çêbûna wî.

Şair çi xweş dibêje:

***Seranser kaînat kitabûllah el-'Ezem e,***
***Tu kîjan herfê seh bikî, meneya wê tev ji Ellah tê.***

*"Kaînat ji vî serî heta bi wî serê din mezintirîn kitêba Xuda ye. Tu kîjan herfa vê kitêba mezin bixwînî, tu yê bibînî ku meneya wê Ellah e. Tu li ser kîjan zerreya kaînatê tefekkur bikî, ewê te bigihîne Ellah Teala."*

## Divê Tefekkur Ji Bo Emelî Wergere

Divê ew agahî û malûmatên ku însan ew bi tefekkur, zikr û mûraqebê qezenc kirine ji bo gihiştina heqîqetê bên tetbîq-kirin. Însanê ku li ser heqîqetên îlahî û ayetên Qur'ana Pîroz difikre, heke bi mûcib û lazimîyên wan emel neke, naxwe wî tefekkura xwe di ast û sewîyeya meqbûl de bicih nekiriye. Lewra emel, înîkasa [xuyabûna] zahirî ye ji bo wê tefekkur û tehessusa ku batinî ne.

**Îmam Ğezalî** di vê xusûsê de wiha dibêje:

"Fêkîyê tefekkurê îlm e; ew ji bo qezenckirina hal û berê xwe dana li ser emelên salih e. Dema îlm di qelb de hasil bibe, hal û rewşa qelb diguhere. Dema halê

qelb biguhere, emelên endam û azayan jî diguherin. Ji vî cîhetî ve emel, peywendê hal û rewşê ye. Hal û rewş peywendê îlmê ye û îlm jî peywendê tefekkurê ye. Heke wilo be, naxwe tefekkur, hem destpêk, hem jî kilîla hemû xêran e.

Tefekkura rasteqîne, ew tefekkur e ku însan ji mekrohîyan diajoyê ser sipehîtiyan û ji hirs û çikûsîyê jî însan diajoyê ser zahidîtî û qenaetê. Ev tefekkureke wisan e ku hal û rewşa mûşahede û teqwayê bi însan dide qezenckirin."[250]

Însan, bi xêra tefekkur û lêkolîna ku bi emelî wergerîyaye û pratîze bûye, ji nexweşîya dîtina xarîqûladeyên kaînatê ya bi awayekî adetî xilas û rizgar dibe.

Bi rastî însanekî normal û ji rêzê, bi teqdîr û ecibandin keval û tabloyên ressamekî ku tebîet teqlîd kiribe û anîbe wicûdê temaşe dike û jê re devqîç û heyran dimîne. Lêbelê ew li hemberî kaînat û xaliq û aferînerê wê hest bi heman teqdîr û ecibandinê nake. Ew van hemû xarîqûladeyan karên ji rêzê û normal telaqî dike û werdigre.

Lêbelê dostên Heq Teala, xwediyê dil û qelbekî paqij û safî, ew di şûna van kevalên ku ressamî ew anîne meydanê ji bo nav û dengê xwe sağ û nemir

250 Ğezalî, Îhya, c 6, Rib'ût-Tefekkur, s. 47.

bihêle, li hemberî senetkarê esîl û berhem û eserên wî yên li vê kaînatê hest bi kelecan û heyran-mayînê dikin. Ew zewqê ji wan huner û senetê qudreta îlahî distînin; ewên ku wî ew di xarîqûlade û sipehîtahîyên bêsînor yên ku di xweza û tebîetê de anîne wicûdê. Ew li çîçek û pelên gîya û nebatan dimeyzînin; ew çîçek û pelên ku ji heman erdê dertên û bi eynî avê tên avdan; lêbelê dîsa jî fêkîyên wan cuda cuda ne, rengên wan cuda cuda ne, awayên wan curecur in û te‘m û çêja wan curecur in. Ew li nexş û nîgarên qudreta îlahî û sipehîtahîya di wan çîçek û pelan de dinêrin; ew li fêkîyên darên curecur, bêhna wan cuda cuda û awayên wan rengo rengo û te‘m û çêja wan curecur dinêrin. Ew li nexş û nîgarên di bask û çengên pirpirîkê de dimeyzînin û îbret jê digrin, ewa ku digel temen û emrê wê ji hefteyek, yan jî du hefteyan zêde nabe jî lê dîsa ew, ewqas ciwan û bedew hatine aferandin. Ew li xarîqûlade û hunerê ciwan yê ku di xulqîyeta însan de hene, temaşe û nezer dikin. Ew guhê xwe baş didin dîtina çavan û îdraka mejî û beyankirinên sirrengîz yên ku di van de hene ku ji wan re “lîsanê hal” tê gotin.

Ji bo mirovên wiha, êdî kaînat hemû wekî kitêbekê ye ku ew ji xwendinê re hazir e. Evên ha, ji îlmên di rêz û setran de derbas bûne û gihane îlmê di sing û dilan de. Ew bi temamî her wekî **Mewlana Celaleddînê Rûmî** ne, ewê ku nefsa xwe di kitêban de defin kiribû û veşartibû dema ew di Medresa Selçûqîyan de mûd-

derisekî normal û di halê xwe de bû. Lêbelê çi dema çîkek ji Feyza nûra derwêşê meczûbê bi navê **"Şemsê Tebrîzî"** ya bi nezera îrşadê lê ket, êdî wî destpê kir û bi agirê îşqê şewitî. Êdî li cem wî, ji bo wan kitêbên ku wî emr û temenê xwe di ber wan de xilas kiribû ti biha û qîmetek nema. Êdî wî dest bi xwendina sirr û nexş û nîgarên kaînatê û ciwabîyên hunerê îlahî yên têde kiriye. Piştî vê, wî kariye kitêba şehesera xwe ya bi navê **"Mesnewî"**yê pêkbîne, ewa ku rîsale û feryadname, zarezarname û laklakname ye ku ew sirr û hikmetên di însan, kaînat û Qur'anê de hene, îzah dike.

Xwezîya me bi van mirovên xas be! Ewên ku jîyana xwe ya dinyayê di tefekkur û tedebbura bi qelbekî tenik û tije nûra îmanê û bi eqlekî selîm derbas kirine û ew bi rêzanîya wehîyê terbîye û perwerde kirine û karîne bigihin merîfetûllahê..

# PAŞGOTİN

Di roja me ya îroyîn de hinek însanên ku ji tarîxa xwe û kultura xwe re bûne bîyanî, di fêrgehên propagandaya xwe pêşvebirina şexsî ya jêder Rojava de, yan jî di fêrgehên yoga-medîtasyonê yên jêder rojhilata dûr de li hizûr û aramîyê digerin. Hal-hal e, hizûr û aramîya rasteqîne ya ku însan lê digre, di mûraqebê de ye; ewa ku Îslam wê bi zikr, tefekkur û lêkolînê tewsîye dike û ew kilîla hikmet û heqîqetên îlahî ye.

Ew tefekkura ku bi tedebbur û lêkolînê qelbî gihabe; serkehnîya înşîraha rûhî û aramîya qelbî ye. Lewra tefekkureke wiha, mirovî digihîne hikmetê. Serê hikmetê jî tirsa ji Xuda ye; teqwa û hesta xeşîyetê ye.

**Welhasil;** tefekkur, mûmînî digihîne riza û mûhebbeta Xuda Teala.

Ew însanê ku karibe bi awayekî layiq li ser kaînat û hadîsatê [bûyeran] tefekkur bike, ewê li bersiva

pirsên wiha; "Ev cîhan çi ye? Ez çima hatime aferandin? Heqîqet û mahîyeta rojên fanî çi ye? Rêya seadetê kîjan e? Ez çi yê kê me? Divê ez çawa bijîm? Ez ji kuderê hatime û ezê biçim kuderê?" bigere. Ev fikr û raman dê wî ji arzû û hewesên berwext û demî yên dinyayê xilas bike û ewê wî bigihîne rêya rast û seadeta ebedî.

Me di vê berhema naçîzane ya xwe de hewl daye perçekekî besît ji hikmet û heqîqetên ku di kaînat, însan û Qur'anê de hene, rapêş û eşkere bikin û me ji tesbîtên îlmî yên serdema xwe jî îstîfade kiriye. Kî dizane, dibe ku di paşerojê de çendîn hikmet û sirr derkevin meydanê û ew ronahîyê bixin ser sermedîyet û bêdawînîya qudret û ezemeta îlahî.

Ji bilî vê jî, ew xusûsên ku me di vir behsa wan kiriye ji mijara ew çend nimûne û mîsal in û bi qasî hecmê mûtewazî û biçûk ê kitêba me ne.

Xwendevanên rêzdar! Înşaellah di ronahîya van nimûne û mîsalan de, ew tefekkura ku me hewl daye em wê bînin zimên, ewê bigihîje aso û ufûqeke wisan ku di alema dilê xwe de dorê li hemû heyber, mexlûqat û bûyeran bigre. Her wiha ew di xwe de çendîn durrên sirr û hikmetan ji deryaya merîfetûllahê kom dikin.

Ey Cenabê Heq Teala, tefekkureke bilind û asofereh ji me re lutf bike! Ji me re hêsan bike ku em

qelb û dilên xwe sağ bikin û em bi nêrîna îbret-girtin û tedebburê sirr û hikmetên Qur'an, însan û kaînatê bixwînin. Me bixe ji wan evdên xwe yên bextewar; ewên ku tim di halê mûraqebê de dijîn û bi awayê layiqê celaleta te digihin merîfetûllahê û naskirina te, ya Xudayê alemê! Amîn!

# FERHENGOK

**- A a -**

**Abid:** Îbadetkar. Taetkar.  Xwe binimêjêbexş. Ewê ku Xudaperestî, nimêj û taet ji xwe re kiriye pîşe û meslek.

**Aferandin:** Xuliqandin. Çêkirin. Anîna wicûdê. Peydakirin.

**Aferîner:** Xaliq. Çêker. Peydaker.

**Alem:** Cîhan. Dinya. Gerdûn.

**Aliman:** Geljimareya alim e. Ew zanayên dînê îslamê ne. Ewên ku têr agahî û malûmat in.

**Amadekarî:** Hazirî. Karbûnî. Îstîdad. Cahizîyet.

**Amîn:** Qebûl bike. Daxwaza me bîne cih.

**Arif:** 1. Zana, aşîna. 2. Ewê ku bi awayê layiq Heq Teala û berhemên wî fehm dike, wan dizane, bi îlmê xwe emel dike, bûye xwediyê îrfanê û gihaye zanîna kemal, merîfet û heqîqetê.

**Armanc:** Nîşan, hedef, ğaye, emac.

**Arzû:** Daxwaz, hewes, reğbeta dil, teleba ku ji kûrahîya dil tê.

**Asîman:** Dijê erdê ye. Banê ser mirovan re ye.

**Ast:** Sewîye.

**Astronomî:** Zanista ku bi cismên asîmanî re elaqedar dibe. Hey'et, feleknasî.

**Awa:** Şekl û sûret.

**Axaftin:** Peyv, xeberdan.

**Ayet:** Her cumle, hevok û komikeke Qur'anê ye.

**Aza:** Endam, organ.

**Azad:** Serbest. Riha. Rizgar.

**- B b -**

**Baqî:** 1. Sifetek ji sifetên Xuda ye. 2. Daîmî, Mayî û nemir.

**Batil:** 1. Pûç, beyhûde, derew, rizîyayî, yê nerast û neheq. 2. Bêhukm, ne derbasdar. Nerewa.

**Batinî:** Hundurî, nedîtber, tişta ku bi raz û sirr û hikmetan re têkildar e.

**Belağet:** Zanista rêz û rêçên Edebîyatê. Di xeberdan û nivîsê de ya tekûz û îfadeya bi huner û bi bandor e.

**Berate:** Elamet, remz û nîşan.

**Bereket:** Feyz, rêhtina xêran û ferehvanî ye.

**Berhem:** Eser, karpêk.

**Besîret:** Pêşebînî, dîtina bi qelb e.

**Bextîyarî:** Bextewarî, şadmanî, dilcoş, keyfxweşî û seadet e.

**Bilind:** Bala, ulwî.

**Bîner:** Ewê ku dibîne, temaşe dike.

**Bîser:** Ewê ku dibihîze û seh dike.

**Bîyo-kîmyewî:** Tevnên zindî û bûyerên kîmyewî yên bi van tevnan re elaqedar.

**Berze:** Winda, ğaib, ne hazir.

**- C c-**

**Cemalî:** 1. Tişta ku li sifetên Xuda Teala yên cemalî vedigere. 2. Ewê ku bi mîzaca xwe xwediyê cemalê be, sipehî be, bedew be, lihevhatî be, lutfkar û dilovan be.

**Cîhan:** Dinya, alem, gerdûn, kaînat.

**Cîhet:** 1. Alî, teref, dîtin, rexê dîtinê ye. 2. Wesîle.

**- D d -**

**Delalet:** 1. Elamet. 2. Rêşanîderî, rêberîtî, delîl û şanerî ye. 3. Ew di mentiqê de vê îfade dike; divê ji pêzanîna tiştekî, tişteke duduyan were zanîn.

**Derûnî:** Hinavî, daxilî.

**Desthilatî:** Îqtîdar, hukmranî û destbilindî ye.

**Destûr:** Îzn, mûsaede, pêrazîbûn e.

**Diqqet:** Bal, dêhn, balkêşî, dêhnkêşî.

**Dîrayet:** Zekawet, zeka, agahî, fehmkirin, têgihiştin, berketin. Jîrîtî, şûmîtî.

**Dirûd:** Selat.

**Dîsa:** Careke din, neqleke din, ji nû ve.

**Divê:** Gerek e, lazim e. Pêdivê ye.

**Dûçar:** Mûbtela, pêgirtî.

**- E e -**

**Ebes:** Pûç, bêhavil, bêfeyde.

**Ekolojîk:** Zanista hawîrdorê, hawîrnasî, derdorzanî.

**Embrîyolojî:** Zanista gohnxwarina zindîyan ji pêvajoya hêk-kirinê heta bi çêbûna wan û merheleyên ku ew tê re derbas dibin, hûrdikole.

**Emelê salih:** Ew karên xêrê, îbadet û xuyahîyên exlaqê xweş in. Hem jî kirina mûsteheb, wacib, ferz û sunnetan e, ji bo razîkirina cenabê Heq Teala.

**Encam:** Netîce, ekam, eqîbet, dawînek, paşîya kar.

**Endam:** Aza, organ û her beşên tiştekî ne.

**Eqlê selîm:** Ew eqlê ku gihaye selametîyê, ew hesta rastgîr, ew eqlê ku dikare qerar û biryarên rast û durust bide.

**Eqlî:** Ew tiştên eqlber, meqûl, bi eql re elaqedar.

**Erd:** Dinya, sererd, serzemîn, ax.

**Eser:** Berhem, karpêk.

**Eslî:** Ne ferîî, ne wekîl, esasî.

**Ezemet:** 1. Mezinatî. 2. Kubarî, xwe mezinkirin.

- F f -

**Fail:** Kirde, kiryar, ewê ku dike, pêktîne.

**Fasiq:** Ewê ku fermanên Xuda Teala nas û qebûl nake, jirêketî, gunehkar, xirabkar û berbatkar.

**Ferd:** Takekes, bi tena serê xwe, nekom, ne grûp.

**Fêrgeh:** Hînbûnxane, cihê fêrbûnê, telîmxane, dersxane.

**Fêkî:** Meywe, ber.

**Ferman:** Emr, destûr.

**Ferz:** Tişta ku her divê were kirin. Heke nebe, nabe.

**Fesîh:** 1. Ewê ku li gorî qaîde û hûrnuqteyên zimanekî diaxive. 2. Ewê ku bi eşkerehî û zelalî û sadeyî dipeyive.

**Feyz:** 1. Şîrînîya menewî, aramîya dil. 2. Destferehî û bereket. 3. Gihan û pêşveçûn e.

**Fitret:** Aferandinî, xulqîyet, tebîî, xwezayî, cibilîyet.

- G g -

**Galaksî:** Koma stêran.

**Germxane:** Ew malên naylonî yên ku di bin wan de sebze û şînahî tên çandin û xwedî-kirin.

**Giringî:** Ehemmîyet, tişta ku li pêşîyê tê.

- Ğ ğ -

**Ğafil:** Bêxeber, bêhay.

**Ğaye:** Hedef, nîşan, emac, meqsed, nîşangeh, boçûn.

**Ğeyb:** Nehazir, ne li ber çavan, ne elenî, nependî, berze.

**Ğudde:** Toşpî.

**Ğezeb:** Hêrs, ğeyd, enirîn, nerazî bûn.

**Ğerez:** Kîn, nefret, dijminahîya bi dizîkahî.

**- H h -**

**Hadîsat:** Rûdan, bûyer, weqaet, hadîse.

**Haletê rûhî:** Rewşa rewanî, wezîyeta psîkolojîk, haletê nefsî.

**Hedef:** Emac, ğaye, nîşangeh, boçûn, meqsed.

**Hekîm:** 1. Sifetek ji sifetên Xuda Teala ye, ewê ku her tiştê di cihê wê de datîne, ji her tiştî rasertir û bitedbîr e. 2. Xwediyê hikmetê. 3. Hosta, dawer.

**Hemaqet:** Fehmkorî, tênegiha, ehmeqî.

**Hemd:** Sifetên bi qencî, pesinê xweş.

**Hemû:** Tev, giş, temam.

**Heqîr:** 1. Ne mûhîm, nehêja, bêqîmet. 2. Reben, xêv, biçûkxistî.

**Hesenat:** Qencî, rewşên baş, karên çêtir, îşên xêrê.

**Heşr:** Kombûna mirovan di roja qiyametê de ji bo hesabê.

**Hêştir:** Deveh.

**Hêstir:** Qantir.

**Hêvî:** Umîd, bendewarî.

**Hewes:** Arzû, nefsanî, dilbijênî.

**Hîdayet:** 1. Rêya rast, rêya heq. 2. Îslamîyet. 3. Rê-şanîdan.

**Hikmet:** 1. Zanîna bilind. 2. Hakimtî. 3. Sedem, sebebê veşartî. 4. Xeberên exlaqî, gotina şîretkarî, nesîhet.

**Hînbûn:** Fêrbûn, elimîn.

**Hissîyat:** His û hest.

**Hizr:** Fikr, raman, bîrbirin.

**Hukm:** Hukm, daraz.

**- Î î -**

**Îcra:** 1. Çêkirin, bicihanîn, birêvebirin. 2. Kişandin, herikandin û dan herikandin.

**Îhsan:** 1. Qencîya bi rastî û durustî. 2. Karê tekûz, mûkemmel û bêkêmasî.

**Îhtîmam:** 1. Bi diqqet û bêrî-kirin karkirin, bizav û livîn. 2. Diqqet nîşandan û baş meyzandin.

**Îhtîram:** Xatir-girtin, rêz lê girtin û hurmet-girtin.

**Îlmê mûsbet:** Îlmê tecrîbî, îlmê ku di encama ceribandinê de hatiye îsbatkirin, îlmê pozîtîf e.

**Îltîca:**1. Xwe avêtin ber sitara yekî. 2. Bawerbûna bi yekî, xwe sipartin. 3. Dûa û bergerîn.

**Îmana tehqîqî:** Zanîna hemû mesele û mijarên bi îmanê re elaqedar bi delîl û sifet û tefsîlatên wan ve ye. Tesdîqkirin û bêşubhe bawerkirin e.

**În'îkas:** Eks-kirin, xuyabûn.

**Înkîşaf:** 1. Vebûn. 2. Mezinbûn, pêşveçûn. 3. Derketina meydanê.

**Însaf:** Edalet, wijdan.

**Înşîrah:** Vebûna dil, şadîya dil û keyfxweşî.

**Întîba:** Ew tesîr û şopa ku tiştek, şexsek, yan jî bûyerek li ser mirov dihêle.

**Îqame:** 1. Rûniştin. 2. Rakirin, rabûna li ser pêyan. 3. Derxistina meydanê.

**Îqrar:** 1. Bi eşkerehî gotina fikrê xwe. 2. Tesdîq û qebûl. 3. Îtîraf.

**Îrşad:** 1. Rêya Heq, rêya rast nîşandan, îqazkirin. 2. Di tesewwifê de ew e ku mûrşid rêya Xuda şanî mirîdên xwe bide.

**Îradî:** Tişta ku bi xwestin, bi îrade û vîyan hatiye kirin.

**Îstîdad:** 1. Meyla tebîî ye ji bo qebûl û qezenckirina tiştekî û qabilîyet e. 2. Eqilmendî ye. 3. Fehmkirin e.

**Îstîdlal:** Delîl-xwestin, xwesipartina delîlê, encam-deranîna ji delîlan.

**Îstiğfar:** Efû-xwestina gunehên xwe ji Xuda Teala ye û bi komika "esteğfîrûllah"ê tobe-kirin e.

**Îstihqaq:** 1. Heq-kirin, heq qezenckirin e. 2. Heqdesta ku ji bo xizmetekê tê xwestin.

**Îştiyaq:** Zehf arzû-kirin, bêrî-kirin, hesret-kişandin e.

**Îz'an:** 1. Têgihiştin, fehmkirin, eql. 2. Îtaet, guhdarî-kirina li xeberdanê, stûxwehr-kirin. 3. Terbîye, edeb.

**Îzzet:** 1. Bilindahî, balatî, mezinatî. 2. Ezemet û qudret. 3. Hurmet, îkram.

**- J j -**

**Jêneger:** Heke nebe, nabe. Bivê-nevê ye.

**Jîyan:** Heyat, sağî.

**Jîr:** Jêhatî, şûm, bikêrhatî.

**Jor:** Banî.

**Jorîn:** Ewê li jorê ye.

**Jêr:** Xwarê.

**Jêrîn:** Ewê li jêrê be, li xwarê be.

**- K k -**

**Kafir:** Xudanenas, heqnenas, înkarçî.

**Kaînat:** Cîhan, Gerdûn, alem, kewn.

**Kelamî:** Mijara ku bi îlmê kelamî re elaqedar e.

**Kerem:** Camêrî, merdîtî, semahet.

**Kewnî:** Kaînatî, cîhanî, gerdûnî, dinyayî.

**Keyfîyet:** 1. Ew qelîte, hal û rewşa ku tiştek li serê çawa çêbûye. 2. Kar û hadîse.

**- L l -**

**Lezûbez:** Ecele, bilez.

**Lawaz:** Qels, zeîf, weza, ne zexm, ne ji esas.

**Lîteratur:** 1. Edebîyat, wêje. 2. Berhema di mijarekê de ye.

**Lutf:** Kerem, camêrî.

**- M m -**

**Mahîyet:** Heqîqet, rasteqîne.

**Makro:** Mezin.

**Malayanî:** Bêmane, bêfeyde, gotina pûç, tişta ku mirov elaqedar nake.

**Malbat:** Binemal, ezbet, aîle.

**Mecal:** Zeman, taqet, derfet, îmkan.

**Mecra:** Cok, rêya çêbûna tiştekî.

**Medîtasyon:** Jandarî, ğemnakî, tewasut.

**Mefhûm:** 1. Têgiha, meneya ku peyvek wê îfade dike. 2. Tişta ku hatiye fehmkirin.

**Mehdûd:** Sînordar, tixûbdar.

**Meknûz:** Veşartî, tişta ku di erdê de hatî veşartin û depokirin.

**Melekût:** 1. Seltenet, hukmdarî û padîşahî. 2. Alema rûh û melaîketan. 3. Melaîket û rûh, tiştên asîmanî.

**Memûl:** Hilberan, veberhênan.

**Menewîyat:** Rewşa exlaqî, wezîyet û hizûra dilî ye.

**Menfez:** Qula ku tiştek lê nifûz dike û tê re diçe.

**Menfî:** Neyênî, negatîf.

**Meqes:** Alevê qutkirinê ye.

**Merc:** Şert û hoy.

**Merez:** Nexweşî, êş, bela û rewşa zor.

**Merhele:** Pêvajo, sefhe û qunağ.

**Merîfet:** Naskirin, xwe naskirin.

**Merîfetullah:** Naskirina Xuda Teala ya bi qelb û yeqînî ye.

**Merkez:** Navend, cihê ku însan têne wî.

**Meşîet:** Xwestin, vîyan, îrade.

**Mexlûqat:** Aferinde, yên ku hatine xuliqandin.

**Meyl:** Meyla li ser tiştekî.

**Meyyal:** Meyldar.

**Mezîyet:** Xusûsîyeta ku tiştekî ji tiştên din vediqetîne, wî ji wan çêtir dike û xusûsîyetê jê re bexş dike.

**Mîkro:** Ew tişta biçûka ku bes bi mîkroskopê tê dîtin.

**Mîl:** Pîvana dûrbûnê ya ku 1854 metre ye.

**Mizgeft:** Îbadetxaneya mislimanan e.

**Molekul:** Ew zerre ye ku biçûktirîn beşa hemû xusûsîyetên ji maddeyên atoman tê meydanê.

**Mûbah:** Serbest, kirin û nekirina wê wekhev e.

**Mûcerred:** Xwerû, tişta ku ne cism e, saf û xalis e.

**Mûcib:** Lazimî.

**Mûdğe:** Perçê goşt.

**Mûemma:** Asêpirs, pirsgirêk, korgirêk.

**Mûflis:** Ewê ku îflas kiriye. Ewê ku malê xwe û sermîyanê xwe jidest daye. Ewê ku nikare deynê xwe bide.

**Mûhasib:** Hesabgir. Jimardar.

**Mûhebbetullah:** Hezkirina ji Xuda Teala.

**Mûkerrem:** Bi qedr û qîmet. Bi xatir û merîfet.

**Mûnacat:** Feryad û bergerîn.

**Mûnbit:** Berhemdar. Bikêrhatî.

**Mûnezzeh:** Pak û paqij. Ewê ku îhtiyaca wî bi ti kes û ti tiştî nîn e.

**Mûnkir:** 1. Ewê ku înkar dike, qebûl û tesdîq nake. 2. Ewê ku Xuda înkar dike, bêîman. Bêol. Xudanenas.

**Mûqeddes:** Pîroz û paqij. Mûbarek. Qudsî, ezîz.

**Mûqerreb:** Nêzîk, ewê ku nêzîk dibe.

**Mûseffa:** Safî, xalis, sade.

**Mûsexxer:** Stûxwehr, îzndayî, bidestûr.

**Mûşahede:** 1. Dîtina tiştekî bi çavan e. 2. Seyira menewî.

**Mûşexxes:** Tişta ku hatiye bişexskirin, bicismkirin, bişeklkirin. 2. Tişta ku bi çavan tê dîtin û bi destan tê destlêxistin.

**Mûteal:** Bilind, bala.

**Mûtealî:** Bilindî, alî.

**Mûtedil:** Navîngir, wesetgir, ne îfratkar, ne tefrîtkar.

**Mûtekebbir:** Ewê ku xwe mezin dike, ewê ku ser xwe ve diçe.

**Mûtelaa:** Baş fikrîna li ser tiştekî ji bo bikare qerareke rast bide. 2. Mûlaheze.

**Mûtena:** Bi îtîna, bi balkêşî.

**Mûtenasib:** Bi pîvan, bi rêje.

**Mûtleq:** Ew tişta ku ne pêbendê şert û mercekî be. 2. Hebûna ku ji bo hebe îhtiyaca wê bi tişteke din nîn e, sebebê hebûna wî di wî bi xwe de ye. 3. Serbest, mûsteqil. 4. Binbirr. 5. Hebûna mûkemmel û tekûz.

**Mûyesser:** 1. Ew tişta hêsan, ewê ku bi sehnayî çêdibe. 2. Nesîb. 3. Tişta ku hatiye hêsankirin.

**Mûzakere:** 1. Di mijarekê de li pêşberî hev beyankirina fikrê xwe ye. 2. Hevdîtina berî qerar û biryar-danê ye.

**Mûzeyyen:** Hatiye tezyînkirin, hatiye xemilandin, hatiye xweşik kirin, zînetdar, bi xeml û rewş.

**- N n -**

**Naçîzane:** Ne ti tiştane, ne hêja, hîç.

**Navber:** Neqebeyn, mabeyn, valahîya di nav du tiştan de ye.

**Navend:** Merkez, cihê ku nîvê tiştekê be.

**Navgîn:** Wasîte, aletê gihiştina hedefekê ye.

**Nazenîn:** 1. Nazik, zirav, 2. Narîn, dilovan û bi delalî hatiye perwerdekirin. 3. Bicilwe, destevîl, sempatîk.

**Nebat:** Giya.

**Nefsanîyet:** Kîn, ğerez, dijminahî, neyartîya veşartî.

**Neqlî:** 1. Tişta ku bi neql û guhastinê re elaqedar. 2. Tişta ku ne bi rêya eql, lê bi rêya neql û rîwayetê hatiye fêrkirin.

**Neş û nema:** Gihiştin û mezin bûn, hate ajotin û derket.

**Netêgiha:** Ne fehm, ne berketî, ne jîr.

**Netîce:** Encam, ekam, dawîne, aqîbet.

**Nezergeh:** Cihê nêrînê, meyzandinxane, fekrgeh.

**Nezeriye:** Dîtin nêrîn, raman û teorî.

**Nezîr:** Şibh û wek û hemta.

**Nîmet:** Ajar, qencî, lutf, kerem, dayîn.

**Nîzam:** Sîstem, riste.

**Nûtfe:** 1. Ava mêranî û jinanîyê. 2. Ava zelal û safî.

**- P p -**

**Pêğember:** Peyğam ber, peyambir, mesaj-bir, peyv-bir. Qasid.

**Pêhis:** Pê hesîn, şiûr, şîyarî.

**Perwerde:** Terbîye, telîm, xwedî-kirin.

**Pîroz:** Pîroz, paqij, temîzîya mûqeddes.

**- Q q -**

**Qabilîyet:** Karina kirina tiştekê, jêhatin, desthosta.

**Qadir:** 1. Sifetek ji sifetên Xuda Teala ye. Ewê ku xwedîyê karîna mûtleq e. 2. Ewê ku hêza wî têra her tiştî dike. Şîyandar, karedar.

**Qedeğe:** Mehzûr, menkirî, ne helal, ne mûbah.

**Qedîm:** Kevnar, dêrîn, tişta ku li zemanên zehf kevin vedigere.

**Qelbî:** 1. Tişta ku bi dil re elaqedar e. 2. Tişta ku ne bi zimanî be.

**Qeswet:** Tengasîya hinavî, ğem û keder, keser, şîn û ğemxwarî.

**Qet'î:** 1. Binbirr, tişta ku têde cihê şubhe û gomanê nîn e. 2. Bi ti awayan, hîç.

**Qewm:** Cemaet, kom, millet, netew.

**Qeza:** 1. Ew tişta ku Xuda Teala ji ezelî ve bi çêbûna wê qerar daye û diyar kiriye. 2. Îbadetê ku ne di dema xwe ya diyarkirî de hatibe kirin. 3. Ew bûyera ku ne bi daxwaza mirov were meydanê.

**Qiyam:** 1. Rabûna ser pêyan, li ser lingan rawestan. 2. Bizavkirina ji bo tiştekî, pêngav-kirin. 3. Serhildan, serî rakirin. 4. Sağbûna piştî mirinê û rabûna ser xwe.

**Qudret:** Şîyan, karîn, jêhatin û hebûna hêz û qewetê ji bo kirina tiştekî ye.

**Qunağ:** Pêvajo, merhele. Di hedefekê de gihiştina her pêpelingekê ye.

**- R r -**

**Radyator:** Ew cîhaz û alet e ku di germkirin û sarkirinê de bikartê, yan jî buxara germ, yan jî sar, ya hewa û avê diweşîne.

**Ram bûn:** Mûtî bûn, teslîm bûn, desteber bûn, ketina bin fermana yekî din, têkçûn, têkşikestin, bezîn, binketina xwe qebûlkirin.

**Reaksîyon:** Bertek, berepê.

**Rêbaz:** Rêç, şêwaz, metod.

**Rehîm:** 1. Sifetek ji sifetên Xuda Teala ye ku li axretê bi kerema xwe bi evdên xwe mûamele dike û gunehên wan dibexşîne. 2. Birehm, dilovîn, parêzger, berket. 3. Ew sifetê Xuda Teala ye

**Remz:** Remz, berate, îşaret, nîşan, elamet.

**Reqîq:** 1. Zehf zirav, nazik, narîn, dilovan, nazenîn, nazdar. 2. Diltenik, hestgerm, hestyar, dilşewat, dilsoj.

**Rêzan:** Rêber, rêşan, rênas, lîder, pêşîvan, pêşewa.

**Riqqet:** 1. Nazikîtî, ziravî. 2. Nezaket. 3. Di xwebêjîyê de tenikîtî û sernermî. 4. Rehmkirin û dilovanî.

**Riste:** Sîstem, nîzam, dûzen, rêzebendî.

**Riyazat:** Geljimareya Rîyazetê. Ew jî ev e; mirov hindik bixwe, hindik raze, tim îbadetê bike. Bi vî awayî, nefsa xwe terbîye û perwerde bike, bi xwe karibe, xwe li hemberî heramîyê bigre, destê xwe ji zewq û sefaya dinyayê bikişîne û nefsa xwe bişikîne.

**Rubûbîyet:** 1. Rebbîtî, ulûhîyet. 2. Xwedîtî, sahibîtî.

**Rûhanî:** Rûhî, canî, giyanî, rewanî, manewî.

**Rûhanîyet:** Tişta ku bi rûh û can re elaqedar e. Tişta menewî. Halên ku rûh xurt dikin. Tişta ku bi paqijkirina rûh û rewan re elaqedar e.

**- S s -**

**Seddîq:** Rastgo, ewê ku hîç derewan nake, dilsoj, sifetê Ebûbekrê siddîq e.

**Sedeqa cariye:** Ew xêr û hesenat e ku her tim dibe wesîleya ecr û sewabê. Her wekî mizgeft, mekteb, medrese, çeşme, kehnî, bîr, çal, pir, nexweşxane û yên wekî van e.

**Sedr:** Sing, sîne,

**Sekînet:** Sakin-bûn, hizûr, dilaramî.

**Selametî:** 1. Dûrbûna ji derd, tengasî, kêmasî, keser û êşan e. 2. Dawîya bixêr. 3. Xilasî û rizgarî. 4. Rastî û durustî.

**Selîm:** 1. Semîmî, temîz. 2. Mûkemmel, tekûz, sağlem, rast. 2. Bê xeter, bê tehlûke, bê zirar.

**Sena:** Pesn, wesfê bi qencîyê.

**Sermiyan:** Sermaye, malê serekeyî.

**Sexawet:** Merdî, camêrî, destvekirî, çavtêrî.

**Setr:** Rêza nivîsan û xet.

**Seyyah:** Gergîn, gerok, gerkar, tûrîst.

**Sirişt:** Tebîet, xweza, natûrel.

**Sitûr:** Ne zirav, ne tenik, qalind.

**Suflî:** 1. Nizm, yê li jêrê, 2. Ewê ku qiyafetê wî pîs be, xirpanî, xirto-pirto.

**Sunûhat:** Tişta ku tê bîra mirov, diniqute dil, tişta ku di dil de çêdibe.

**Sûû-zen:** Zenna xirab, fikirîna xirab, guman, şubhe, şiwar, şek.

**- Ş ş -**

**Şair:** Hozan, şiêrgo.

**Şebnem:** Xwîsîtî, jale.

**Şibh:** Wek,

**Şîyan:** Qudret, karîn, îqtîdar.

**Şehwet:** Dilbijênî, arzûya nefsanî.

**Şahane:** Melîkane, layiqê qralîyetê.

**- T t -**

**Tabîîn:** Ewên ku di serdema sehabîyan de jîyane, ew dîtine û ji wan hedîs û eser rîwayet û neql kirine.

**Takekes:** Ferd.

**Taqet:** Mecal, qewet, îmkan, derfet.

**Taybetmendî:** Xusûsîyet, mezîyet.

**Te'lîf:** Pev-xweşkirin, pev-dan-hezkirin.

**Te'yîd:** Destek, piştevanî, piştgirî, xurtkirin, teqwîye-kirin.

**Tebdîl:** Guherandin, xistin-şûna hev.

**Tecellî:** Xuyabûn, eyanbûn, beyanbûn, raçavbûn.

**Tecellîyat:**Xuyabûnan, kufşbûnan.

**Tecrîd:** Xwerû-kirin, goşegirî.

**Tedbîr:** 1. Îdarekirin, birêvebirin, kişandin û wergerandin. 2. Hesabkirina dawîya karekî. 3. Berî dest bi kar-kirinê fikirîna zehmetiyên ku derkevin pêşîya însan e.

**Tedebbur:** Tefekkurkirina dawîya xwe, fikirîna heqîqetê ye.

**Teeqqul:** 1. Eqil-kirin, fehmkirin. 2. Bibîranîn.

**Tefekkur:** Hizrkirin, ramankirin, bîrbirin.

**Tefekkura mewtê:** Fikirîna di mirinê de.

**Têgiha:** Îstilah, navlêk.

**Tehessus:** Hiskirin, hestpê-kirin.

**Tehewwilat:** Guherîn û veguherîn.

**Tehqîq:** Bicihkirin, cihwarkirin, di cih de danîn.

**Tekamul:** Guhertina ku gav bi gav pêktê, bi kemalê gihan.

**Teksîf:** Himbizkirin, tîrkirin û zehfkirin.

**Tekûz:** Temam, mûkemmel, ne nuqsan.

**Tekzîb:** Derewandin, şaş qebûl-kirin, nerast-zanîn, derew-derxistin.

**Telaqqî:** Fehmkirin, têgihan, wergirtin.

**Telîm:** Dan-hînkirin, dan fêrkirin, dan-elimandin.

**Telîmat:** Dîrektîf, ferman, emr.

**Temaşe:** Bi zewq seyrkirin, meyzandin, nêrîna bi keyf û şahî.

**Temen:** Emr, jîn.

**Tenik:** Zirav, ne sitûr û ne pehn.

**Tenzîh:** Pakdêrîn, temîzdêrîn, ji kêmasîyan dûr zanîn.

**Teqwa:** Tirsa ji Xuda, ji tirsa Xuda hay ji heramîyan man, xwe parastina ji guneh û sûcên ku dibin sersedemê hêrs û ğezeba Xuda Teala.

**Terbîye:** Edebkirin, perwerdekirin, bi torekirin, bi exlaq-kirin.

**Terkîb:** Sazî, rêzkirin, çêkirin, pêkanîn.

**Tertîl:** Bi ciwanî û tecwîdkî Qur'an-xwendin.

**Tesbîh:** 1. Tenzîhkirina Xuda ji kêmasîyan. 2. Subhanellah gotin.

**Tescîl:** Qeydkirin, tomarkirin, bi awayekî resmî erêkirin.

**Tesdîq:** Rastdêran, rast zanîn, pejirandin.

**Tesellut**:1. Siwarbûna li ser stûyê hinek mirovan. 2. Hukmkirina li wan. 3. Kolekirina wan. 4. Standina îradeya wan. 5. Bindestkirina wan.

**Tesewwif:** 1. Rêbendîya terîqetên sofîyan e. 2. Tezkîyeya nefsê ye. 3. Îrşada ewaman e.

**Tesewwir:** Di zêhnê xwe de zindîkirin, xeyalkirin, anîn ber çavan, fikirîna tişta ku mirov bike.

**Tesfîye:** Safîkirin, temîzkirin.

**Teswîr:** Sûret-zindîkirin, anîn ber çavan, şeklê tiştekî anîn bîra xwe.

**Teşyî:** Bi oğirkirin, bi rê-kirin,

**Texeyyul:** Di xeyalê de sûret pê bexşîn, anîn bîra xwe, di zêhn û mejîyê xwe de candarkirin.

**Texîr:** Dereng-xistin.

**Tezahur:** Xuyabûn, xwe şanîdan, pêşandan.

**Tezekkur:** Bibîranîn, anîn bîra xwe, zehf zikrkirin.

**Te'zîm:** Mezinkirin, hurmetkirin, xatir-girtin.

**Tezyîn:** Xweşik-kirin, sipehî-kirin, bedew-kirin, ciwan-kirin, keşxe-kirin, bi rewş-kirin, xemilandin.

**Tixûb:** Sînor, nîşana di navbera du welatan de, veqetandeka di navbera du tiştan de.

**Tropîkal:** Ew daîreya ku li dehm û parelela Ekvatora gurovera erdê tê qebûlkirin ku yek jê li bakur û ya din jî li başûrê wê dikeve.

**- U u -**

**Ufûq:** Ew cihê ku di navbera erd û asîmanî, yan jî behrê de xuya dibe ku her wekî ew bi yek dibe. Meydana ku tê dîtin û xuya dibe. Aso. Panorama.

**Ulema:** Geljimareya aliman e. Zana, zanayên dînê îslamê.

**Ultravîyole:** Ew tîrêjên ku di baqa tavê de ji şînahîyê bi wêdetir in, şînbiwêdetir.

**Ulwî:** Bilind, menewîyat.

**Unsîyet:** Hogirî, demsazî, sebrpêhatin.

**Uzlet:** Dûrbûna ji mirovan. Xwe dan goşeyekê, înzîwa-bûn.

**- W w -**

**Wacîbat:** Tiştên ku wacib in, lazim in, gerek in, bivê-nevê ne.

**Waqif:** Agahdar, pêzana, xeberdar, haydar.

**Wasil:** Gihayî.

**Welayet:** Welîtî, dostanî, nêzîkatî, sedaqet.

**Weqaet:** Hadîse, bûyer, rûdan.

**Weqûr:** Sergiran, heddê-xwe-zan, xwenas.

**Were':** Xwe dûrkirina ji tiştên bi şubhe da ku xwe ji

gunehan û heramîyan biparêze. Teqwadarî, Xudahezî, dînperwerî, dîndarî.

**Wesf:** Sifet, salix.

**Wesîle:** Navgîn, pêgeh.

**Weswese:** Tevlîhevîya ku nefs û şeytan dixin bîra mirov. Wehm, şubhe, dudilî.

**- X x -**

**Xaliq:** Aferîner, xulqkar, çêker, aferîndox.

**Xalis:** Safî, sade, temîz, yekrû.

**Xelat:** Padaş, perû, îkramîye.

**Xellaq:** Ewê ku zehf dixuliqîne, zehf diaferîne.

**Xelwet:** 1. Bi tenê mana li cihekî girtî. 2. Îbadet, rîyazîyat, xwe kişandina înzîwayê ji bo zikr û mûraqebê.

**Xeşîyet:** 1. Tirs û xewf. 2. Hurmeta li hemberî heybeta manewî.

**Xusûsîyet:** Taybetmendî, mezîyet.

**Xuşû:** Tirs. Saw.

**Xwedbînî:** Xwe tenê dîtin, ezperestî, tekebbur.

**- Y y -**

**Yeqîn:** Pêzanîna qet'î, sağlem, rast û ji gumanê rizgarbûyî; qenaeta mûtleq û îtm'înana temam.

**Yoga:** Felsefeya Hindê ye. Li gorî wê fikrê; mirov dikare di nav rawestin û bêbizavîyê de bi çîlekêşîyê tişta ku dixwaze, bidestxîne.

**- Z z -**

**Zahidîtî:** Biha bi dinyayê nedan, reğbet têde nebûn, qenaetkarî, terk-kirina arzûyên nefsanî, ji tirsa Xuda xwe dûrkirina ji heramî û gunehan û xwe bi îbadetê ve berdan e.

**Zahir:** 1. Tişta ku tê dîtin, xuya, elenî, eşkere. 2. Dîmena derveyî. 3. Tabîî, bêguman.

**Zahirî:** Xuyahî, dîtberî, elenî, li ber çavan.

**Zanist:** Îlm,

**Zat:** Kes, şexs, ferd, xwe, nefs, heyberê eslî.

**Zatî:** Kesî, şexsî, ferdî, xweyî.

**Zêdetir:** Pirrtir, zehftir, gellektir.

**Zikr:** Bîranîn, navê Xuda gotin.

**Zînet:** Sipehîtî, bedew-bûn, xweşik-bûn, bixeml-bûn, birewş-bûn, keşxe-bûn.

**Zirav:** Ne sitûr, tenik.

**Zulmet:** 1. Tarîtî. 2. Mehrûmîyeta ji nûra menewîyatê.

**Zurrîyet:** Kinês, nesl.

# NAVEROK